# Belgeyên Komxebata Tecrubeyên SCS'yên Navneteweyî di Çareserkirina Pevçûnan de

Derek Mooney
Luz Piedad Caicedo
Ana Villellas
Hüseyin Oruç
Cuma Çiçek
Gülçin Avşar

3'yê Mijdar 2018, Stenbol

**NAVEROK**

## Ji Weqfa Aşitiyê

Piştî pevçûna navxweyî/şerê 40 salî ya/yê li Tirkiyeyê, di dîrokeke nêz de, du lêgerînên aşitiyê yên hêja, ku navê Oslo û pêvajoya çareseriyê li wan hatibû kirin, bi sernekeftî bi dawî bûn. Heçî îro ye, em yek ji serdemên herî xirap û krîtîk tecrube dikin.

Meseleya kurd ku sedema pevçûnê ye, di roja îro de veguheriye meseleyeke herêmî û navneteweyî. Hemû lêgerînên ku li ser bingeheke demokratîk, adil û mafên bingehîn ên mirovan ji bo çareseriya wê dihatin kirin, hatine hilanîn û zemîna civakî ya aşitiyê hatiye lawazxistin.

Em ji atmosferekê ku fikrê aşitiyê zîl û geşe dida derbasî qonaxekê bûn ku polîtîka û tedbîrên ewlekarîxwaz û pevçûnxwaz bi ser civakê de zal bûne.

Weqfa Aşitiyê, di vê pêvajoyê de xebatan dike ji bo ku pozîsyon û kapasîteya saziyên civaka sîvîl (SCS) ên li Tirkiyeyê analîz bike ka di bidawîkirina pevçûnan û avakirina aşitiya civakî de pozîsyon û kapasîteya wan çi ye; her wiha xebatan dike ji bo ku pêşniyarên polîtîkayan ji bo civaka sîvîl û akterên siyasî bike. Ev xebat ji bo pêvajoyeke nû ya aşitî/çareseriyê tê kirin.

Me di rojên dawî yên 2017'an rapora **"SCS di Pêvajoya Çareseriya 2013-2015'an de"** ku ji aliyên **Cuma ÇİÇEK** ve hatibû amadekirin û P**rof. Alev ERKİLET, BEKİR AĞIRDIR** û **Etyen MAHÇUPYAN** şêwirmendî kiribû. Raporê analîza encamên wan hevdîtinan li xwe digirt ku li Amed, Wan, Stenbol û Enqereyê di gel nûnerên 45 SCS'yan û sê pisporên mijarê hatibûn kirin.

Piştre di gel wan saziyên civaka sîvîl ên xwecihî ku ji ber çend sedemên curbecur raya wan nehatibû wergirtin, li Stenbol, Mêrsîn û Meletiyê civînên nirxandinên berfireh ên raporê hatin kirin.

Di 5'ê Gulana 2018'an de li Stenbolê di gel nûnerên SCS û akademîsyenan ku di xebata raporê de cih girtibûn komxebateke yek rojî hate kirin ji bo ku encaman binirxîne û encamên hevpar ên serdema pêşiya me derxe.

Yek ji encamên vê komxebatê jî ew bû ku xebatek hate kirin ji bo ku saziyên civaka sîvîl ên ciyawaz bikarin tecrubeyên xwe di gel SCS'yên Tirkiyeyê parve bikin.

Ji bo vê armancê di 3'yê Mijdara 2018'an de, bi beşdariya akademîsyen û nûnerên SCS'yên ji bajarên ciyawaz me komxebateke yek rojî bi navê **"Komxebata Tecrubeyên SCS'yên Navneteweyî di Çareserkirina Pevçûnan de"** li Stenbolê li dar xist.

**Derek Mooney** ji Enstîtuya Geşepêdana Demokratîk, **Luz Piedad Caicedo** ji Komeleya Mafên Mirovan a Kolombiyayê, **Ana Villellas** ji Bernameya Çareseriya Pevçûnan û Avakirina Aşitiyê, **Hüseyin Oruç** Cîgirê Serok IHH'yê û **Cuma Çiçek** ji Weqfa Aşitiyê di komxebatê de tecrubeyên xwe yên ciyawaz parve kirin.

Me di vê xebatê de, tevî pêşkêşiyên ku di vê komxebatê de hatine kirin, nirxandineke giştî û pêşniyarên parêzer Gülçin Avşar ku di xebatên curbecur de cih girtiye berhev kirine.

Armanca me, tevkarîkirin e ji bo ku di pêvajoyeke nû de SCS'yên karîgertir û bikapasîtetir derkevin; armanca me xizmetkirin e ji bo ku rêyeke nû bê peydakirin ji bo aşitiyê. Em piştrast in ku her sazûman û kesên ku xebatên aşitiyê bi rê ve dibin, gava ku van tecrubeyên cuda cuda bixwînin, wê tevkariyeke girîng li wan bike û em piştrast in ku gelek ders hene ku divê ji wan bêne derxistin. Em hêvî dikin ku em ne şaş bin.

Wek desteya birêveberiyê deynê me ye ku em bêjin spas ji wan kesan re ku tevkarî li pêkhatina vê xebatê kirin.

Em gelek spasiya **Derek Mooney, Luz Piedad Caicedo, Ana Villellas, Hüseyin Oruç** û **Cuma Çiçek** dikin ku pêşkêşî kirin û gelek spasiya **Gulçîn Avşarê** dikin ku bi nivîsa xwe tevkarî lê kir. Em yek bi yek spasiya wan dikin: Nûnertiya Komeleya Heinrich Böll Stiftung li Tirkiyeyê û Enstîtuya Geşepêdana Demokratîk ku piştgiriya me kirin, edîtorê me **Arife Köse** û wergêrên me **Eyyup Subaşi** û **Sibel Erdumanê**, **Sergen Karakaş** bû alîkar ji bo birêvebirina projeyê.

Bi hêviya ku em di xebatên nû de yekdu bibînin...

**Desteya Birêveberiyê ya Weqfa Aşitiyê - Rêbendan 2019**

## Pêşekî

Kitêba li ber destê we ji axaftinên wan beşdaran pêk tê ku li "Komxebata Tecrubeyên SCS'yên Navneteweyî di Çareserkirina Pevçûnan de" beşdar bûne ku ji aliyê Weqfa Aşitiyê ve di 3'yê Mijdara 2018'an de li Stenbolê hate lidarxistin. Me hewl da em van axaftinan kurt bikin.

**Derek Mooney,** ji Îrlandayê ku wek nûnerê Enstîtuya Pêşveçûna Demokratîk li komxebatê beşdar bû û li ser beşdarbûna li pêvajoya aşitiyê bi rêya SCS'yan xwedî tecrube ye, tecrubeyên ku di Pêvajoya Aşitiya Îrlandaya Bakur de bi dest xistibûn parve kirin û li rola alîkarbûna akterên civaka sîvîl di avakirin û pêşvebirina diyalogê de hûr bû û der heqê xebatên Navenda Aşitî û Levkirinê-Glencree de agahdarî dan. Piştre behsa tevkariya ciwan, komên werzişê, komên jinan û komên nîv polîtîk ên wekî Navenda Aşitî û Levkirinê-Glencree li pêvajoyên aşitiyê kir û behsa wan dersan kir ku ji vê pêvajoyê derxistine. Li jêr ronahiya van tecrubeyan, her çend hê bi awayekî tam nekarîne pirsgirêka Îrlandayê çareser bikin jî, cext kir ku hîn bûne ka çawa dikarin pevçûnê bi rê ve bibin.

Ji Îrlandayê, **Luz Piedad Caicedo** ku wek nûnerê rêxistina mafên mirovan a bi navê Corporación Humanas li Komxebata beşdar bû, piştî ku paşxaneya pevçûnê û hewlên aşitiyê veguhestin, got ku yek ji ferqa girîng a pêvajoya aşitiyê ya dawî ji yên din ew e ku beşdariyeke gelek berfireh a civaka sîvîl di ya dawî de hebû. Behsa wê pêvajoyê kir ku bi peymana aşitiyê ya di navbera FARC û hukumeta Kolombiyayê de bi dawî bûbû û got ka di wê pêvajoyê de forûmên tematîk, fîzîkî û mecazî(virtual) yên ji bo beşdarkirina hemwelatiyan li pêvajoyê hatibûn pêk anîn çi qas karîger bûne yan jî hevdîtina rasterast di gel lijneyên hemwelatiyan nexasim mekanîzmên daxilkirina mexdûrên pevçûnê li pêvajoyê çi qas karîger bûne. Got ku nexasim di hemû astan de beşdarbûna rêxistinên jinan li her qonaxa aşitiyê ferqeke mezin çêkir.

**Ana Villellas** ku ji Îspanyayê, ji Zanîngeha Xweser a Barselonayê li komxebatê beşdar bû, pispor e di mijara analîza pevçûnan û pêvajoyên aşitiyê de û di van mijaran de gelek xebat û lêkolînên wê hene. Wê ewil berê xwe da lêkolîna çalakî-arastekirî (action-oriented) ku li Navenda Dibistana Çanda Aşitiyê pêk anîne û piştre behsa siruşta pêvajoyên aşitiyê û rol û fonksiyonên mûhtemel ên civaka sîvîl di çareserkirina pevçûnan de kir. Ewil qala van tecrubeyan kir: diyalog-danîn bi rêya çarçoveyeke lihevkirî, pêvajoyên aşitiyê berfirehtir in ji maseya gotûbêjan û berfirehtir in ji rolên ku civaka sîvîl dikare di pêvajoyên aşitiyê de bilîze; û piştre bi awayekî bidetay zelal kir ka nexasim civaka sîvîl dikare fonksiyoneke çawa bilîze. Li ser esasa wan lêkolîn û xebatên ku di vê qadê de hatine kirin, bi mînakan qala hêza berxwedanê li dijî tundûtîjiyê ji bo rêvekirin li ber guhertinan, hêza îfşakirinê, hêza ve-çarçovekirinê û hêza derxistin / analîzkirin / pêşniyarkirinê ya civaka sîvîl kir. Villellasê her wiha dersên ku ji pêvajoyên din ên dinyayê hatine derxistin xulase kirin.

**Hüseyin Oruç** ku li ser navê Weqfa Maf û Azadiyên Mirovan (IHH) li komxebatê beşdar bû, di wê lijneya navneteweyî de peywir wergirtiye ku çavdêriya cîbicîkirna peymana aşitiyê ya Fîlîpînê dike. Wî serê pêşîn behsa paşxaneya dîrokî û civakî ya pevçûna li Fîlîpînê kir û paşê agahî li ser pêvajoya aşitiyê ya li wir dan. Behsa girîngiya berdewambûna hevdîtinan kir di dema pevçûnan de, behs kir ka çawa fonksiyonel e dema ku gotûbêj li ser erdên welatekî sêyem berdewam bikin ji bo ku pevçûn bandora neyînî li hevdîtinan nekin, behsa sûdên navbînkariya gelek welatan kir ku Tirkiye jî di nav wan de bûye. Oruç her wiha behsa tecrubeyên IHH'yê yên di vê mijarê de kir ji ber ku IHH di nav wê lijneyê de bûye ku çavdêriya cîbicîkirina peymana aşitiyê ya li Fîlîpînê kiriye. Nexasim cext li ser rola qanûnîbûna peymana aşitiyê di mayindekirina aşitiyê de kir.

Heçî **Cuma Çiçek** e ku niha li bin banê Navenda Lêkolînên Navneteweyî ya Enstîtuya Etûtên Polîtîk li Parîsê xebatên xwe yên akademîk bi rê ve dibe û meseleya kurd jî tê de li ser qada zanista siyasetê gelek gotar û xebatên wî hene, nexasim di çarçoveya meseleya kurd de ew dînamîk rave kirin ku li Rojhilata Navîn û Tirkiyeyê diguherin û cext kir ku Tirkiye di mijara meseleya

kurd de hatiye ber duriyanekê; cext kir ku her wekî ji nimûneyên dinyayê derdikeve bidawîbûna tundûtîjiyê û aşitî tenê bi rûniştina aliyên pevçûnê li ser maseyê ne mumkîn e; cext kir ku teqez divê civaka sîvîl jî li pêvajoyê daxil be ku girîngiyeke vê ya jiyanî heye. Wî di axaftina xwe de pozîsyon û kapasîteya SCS'yan analîz kir ka ji bo bidawîbûna pevçûnan û avakirina aşitiyê di meseleya kurd de wan çi pozîsyon û kapasîte heye. Ji bo vê yekê jî datayên wê xebatê bi kar anîn ku di sala 2017'an de li Amed, Wan, Stenbol û Enqereyê di gel 45 SCS'yan û bi sê pisporan encam dabûn. Çiçek piştî ku rave kir bê ka civaka sîvîl dikare rol û fonksiyoneke çawa di pêvajoyên aşitiyê de bigêre, tecrubeyên SCS'yan ên di Pêvajoya Çareseriyê ya Tirkiyeyê de veguhestin. Gava ku Çicek ev vediguhestin, behs kir bê ka SCS'yan di Pêvajoya Aşitiyê de çi kirine û çi nekirine nexasim behsa wan kêmasiyan kir ku di mijara civakîkirina aşitiyê de derketin û behsa sedemên van kêmasiyan kir.

Heçî **Gülçin Avşar** e, behs kir ku her çend li Tirkiyeyê pêvajoya aşitiyê ku herî zêde tê zanîn Pêvajoya Çareseriyê ye, ku berî demeke kin me tecrube kir, lê di esasê de dîroka hewlên kevn ên aşitiyê hene; wê li ser vê dîrokê agahî dan. Avşarê diyar kir ku her çend civakê bi kêfxweşiyeke mezin pêşwazî li Pêvajoya Aşitiyê kiribe jî, gava ku di gel mînakên pêvajoyên aşitiyê yên din ên navneteweyî bê berawirdkirin, derdikeve ku SCS'yên li Tirkiyeyê têra xwe li vê pêvajoyê daxil nebûne. Avşarê bal kişande ser wê yekê ku li dinyayê ti pêvajoyeke aşitiyê nîne ku di carekê de bi ser keftibe û behs kir ku roleke mezin a zexta civak û civaka sîvîl heye da ku alî dest ji aşitiyê bernedin. Avşarê dupat kir ku divê em bawerî û hêviya xwe ji dest nedin; ji ber ku her çend niha aşitî gelek dûr bê xuyakirin jî, di wan deman de ku pevçûn bi şîddet dewam dikin jî di bin re hevdîtinên aşitiyê berdewam dikin û ji bo vê yekê mînak jî anîn.

Careke din em sipasiya beşdaran dikin û hêviya xwendineke bikêf dikin.

**Arife KÖSE**

# Ezmûnên SCS'yên Navneteweyî di Çareserkirina Pevçûnan de

## *"SCS'yan çi di Pêvajoyên Çareseriyê de pêk anîn, çawa karîger bûn, çi kêmasiyên wan hene û divê çi bê kirin?"*

## Axaftina Derek Mooney

**Destpêk**

Ez spasiya mazûvanên me û organîzatoran dikim ku ez vexwendime ji bo ku bi we re îro li vir xeber bidim.

Ez bextewer û memnûn im ku îro nûnertiya Enstîtuya Pêşveçûna Demokratîk dikim û tecrubeyên ku min ji Pêvajoya Aşitiya Îrlandaya Bakur bi dest xistine bi we re parve dikim û hin dersan vekolîn dikim ku SCS û komên aşitiyê di vê pêvajoyê de hîn bûne.

Dîtgeheke min a hinek taybet li ser vê mijarê heye ji ber ku ez li Îrlandayê têkildarî dewletê, di asta polîtîk de û di sektora SCS'yan de xebitîme.

Pêşkêşiya min ê wiha bi rê ve biçe: Ez ê ewil bi kurtasî behsa karê xwe, xebatên xwe û çîroka xwe ji we re bikim.

Paşê, ez ê kurteyeke gelek kurt ji pevçûna li Îrlandaya Bakur pêşkêş bikim. Ez ê berê xwe bidime rola rêxistinên civaka sîvîl û akterên civaka sîvîl ên curbecur ku çawa bûne alîkar di mijara avakirin û pêşvebirina diyologê de.

Peyre ez ê li ser xebatên Navenda Aşitî û Lihevkirinê ya Glencreeyê bipeyivim ku ev deh sal in ez bi dildarî tê de dixebitim. Glencreeyê di gel Enstîtuya Pêşveçûna Demokratîk hevparî di hin xebatan de kiriye ku siyasetmedarên tirk, çalakvanên rêxistinên civaka sîvîl, akademîsyen û rojnamegeran çêkirine gava ku serdana Îrlandaya Bakur û Başûr kirine.

**Xebatên ku min kirine:**

Ez şêwirmendiyê di mijarên ragihandin û polîtîk de dikim. Ez pêşniyaran ji BEERG'ê re (Koma Têkiliyên Xebatkarên Bruksel Ewrûpayê) radigihînim. BEERG toreke rêveberên bitecrube yên Çavkaniyên Mirovî ye ji kompaniyên pir-neteweyî ku li Ewrûpa / EMEA'yê (Ewrûpa, Rojhilata Navîn, Efrîqa) xebatan dike.

Her wiha ez şêwirmendekî polîtîk im. Li Îrlandayê nexasim ez di mijara namzedên xwecihî û neteweyî de pêşniyaran ji partiya Fianna Fáilê re dikim. Namzedên ku min pêşniyar kirin hatin hilbijartin.

Min şêwirmendî ji bo aliyê ku gotin Belê kir di referandûma dawî ya wekheviya zewacê de. Her wiha ez mudîrê lêkolîn û peyam-guhertinê bûm di wê kampanyayê de ku ji bo parastina Senatoyê hatibû kirin.

Ez şêwirmendê polîtîk û polîtîka ewlehiyê ya Wezîrê Parastina Îrlandayê bûm di navbera salên 2004 û 2010'an de. Ji 1995'an ve ez ji bo partiya Fianna Fáil li ser polîtîkaya Îrlandaya Bakur dixebitim lê ez xabatkarê partiyê nebûm. Di destpêka 2000'an de ez bûm sekreterê lijneya partiya Fianna Fáil di Forûma Aşitî û Lihevkirinê de.

**Kurtedîrokeke gelek kurt ji Pevçûna Îrlandaya Bakur**

Îxtîlafa li Îrlandaya Bakur, di gel wê yekê têkildar e bê ka Îrlandaya Bakur bibe parçeyekî kîjan welatî: Parçeyekî Îrlandayê yan jî parçeyekî Îngîlîstaneke berfirehtir?

Li aliyekî Yekîtîparêz hene ku protestan in û li aliyê din neteweparêz/komarîxwazên îrlandayî hene. Pevçûnan niha formek bi xwe ve girtiye ku tundûtîjiyê li xwe nagirin.

Komarîxwaz Îngîlîstanê ji ber dîroka wê ya mêtingeriyê nexasim jî ji ber polîtîkayên wê yên çandiniyê yên mêtinger tawanbar dikin. Lê Yekîtîparêz peywendeke siruştî di navbera Îrlanda û Îngîlîstanê de dibînin. Bawer dikin ku daxilbûn li Brîtanyayê baş e ji bo Îrlanda û Brîtanyayê.

Cudakariya modêrn di nav zeviyan de dest pê kir. Kesên ku ji bo cîbicîbûnê hatin, protestan bûn; protestanan “dêmanî”yên katolîk ji cihên wan kirin. Vê ciyawaziya dînî nehişt ku ev civak ji hev veqetin. Lê ev pevçûn ne têkildarî dîn bû, têkildarî nasnameyê bû.

Rehên pevçûnê xwedî dîrokeke dirêj in. Neteweparêzên katolîk di salên 1050 û 1960’î de perwerde wek rêyekê bi kar anîn da ku ji feqîriyê rizgar bibin. Wan da pey nimûneya tevgera mafên sîvîl ên amerîkayiyên reş ku ji Martin Luther King hîn bûbûn.

Wan ji bo mafên hemwelatîbûnê bang dikirin. Ev bang ji bo mafê dengdanê bo xaniyên giştî û hwd. bû; îsal salvegera 50’em a Meşa Mafên Sîvîl e.

Bersivnedana piraniya Yekîtîparêz bi van bangewaziyan û baweriya ku digot pirsgirêk ne polîtîk e lê pirsgirêkeke ewlehiyê ye bû sedem ku pevçûnên tundûtîj ji nû ve derkevin û ji nû ve zindî bibin –jixwe her dem hebû, ti wext neçûbû.

Di nava wan pirsgirêkan de ku ji 1969’an heta Peymana Îniya Bixêr berdewam kirin, 3.635 kes mirin û 500.000 kesî bandor ji wan girt (hate kuştin, birîndar bû weya trawma lê çar bû).

Li gorî pevçûnên din ku li dinyayê hene, ev hejmar ne gelek bilind bûn. Di gel vê yekê, bi awayekî nîsbî, ev hejmar gelek bilind bûn. Bandora pevçûnê ew bawerîpênekirin zêde kir ku bûbû sedema destpêkirina pevçûnê.

Di vê pevçûnê de ku 800 sal e berdewam e, serkeftina rasteqîn a Peymana Îniya Bixêr gihîştin bi xalekê bû ku hemû alî bikarin qebûl bikin ku ciyawaziyên xwe bi rêyên aşitiyane û demokratîk çareser bikin.

Îxtîlafa li Îrlandaya Bakur ne bi dawî bû ne jî çareseriyek jê re hate peydakirin; esasen Brexitê pevçûn kûrtir kir û rewş bêîstîqrar kir.

Me nekarî em pevçûna xwe ya li Îrlandayê çareser bikin.

Tiştê bûyî ev e; em hînî birêvebirina pevçûna xwe bûn.

Em êdî qebûl dikin ku tundûtîjî pevçûnê çareser nake û divê em li siyasetê binêrin ji bo çareserkirina pevçûnê.

Ev serkeftineke mezin e û tiştek e ku divê EM HEMÛ wê biparêzin û desteber bikin.

**Rola SCS'yan û Civaka Sîvîl di Çarserkirina Pevçûnan de**

Rola civaka sîvîl di çareserkirina pevçûnan de nîqaşbar e.

Rageşiyek di navbera partiyên siyasî yên heyî û SCS'yan de heye. Partiyên siyasî têne hilbijartin û lewma tê îddîakirin ku civaka sîvîl jî temsîl dikin. SCS çi qas mezin weya çi qas xwedî çavkaniyên baş dibin bila bibin, nikarin heman rayeyê daxwaz bikin. Ez ê vegerime ser vê mijarê nexasim gava ku ez li ser Glencreeyê bipeyivim. Çiku bi fikra min Glencreeyê rêyek pêşve bir ji bo ku vê rageşiyê rake –hemahengî ji bo alîkarbûnê û bikaranîna vê hemahengiyê.

Partiyên siyasî nûnerên yekem bûn di gotûbêjan de.

Partiyeke siyasî bi navê Koalîsyona Jinan li Îrlandaya Bakur hebû ku di heman demê de rêxistineke civaka sîvîl bû. Piştre ez ê der heqê wê de zêdetir bipeyivim.

Gelek SCS û rêxistinên civaka sîvîl û aşitiyê hebûn ku li dor û di nav îxtîlafa Îrlandaya Bakur de xebat dikirin.

Tê texmînkirin ku 400 rêxistin li Îrlandayê hene ku li ser pêvajoya aşitiyê dixebitin. Hinek ji van saziyan di nav wan de tenê 5 heta 6 û di nav hinan de jî 500 kes hebûn. Hin sazî hebûn ku ji bo xebatkarên ku di gel dildaran dixebitîn û ji bo tiştên din destheq didan.

Hinekan pere hebû û hinekan tunebû. Lê bêje hemû tev li siyasetê bûbûn.

Van SCS'yan hin kategorî li xwe digirtin

• Komên dêran

• Komên ciwanan

• Komên werziş û çandê

• Komên jinan

• Komên aşitiyê

• Komên ku bi awayekî polîtîk hevkarî dikirin

Çar dêrên sereke li Îrlandaya Bakur û Başûr hene: Prêsbîteryen, Anglîkan, Metodîst û Katolîk.

Rêberên van her çar dêran di destpêka 1970'yan de cara yekem di qada giştî de hatin ba hev û ji wê demê ve teqrîben salê şeş caran bi awayekî rêkûpêk dicivin.

Hêza nîşandana rêberiya hevpar girîng e her wekî rêberên dînî pêk aniye û ji 1971'an ve di gel hemû şertûmercên dijwar karîne rêberiyeke hevpar nîşan bidin.

Parêzkar(mihafezekar)ên her du civakan li dijî vê hevpariyê bûn ku bi rêberên polîtîk ve hewl ji bo wê hatibû dayîn. Bo nimûne Rev Ian Paisle, rêberên protestan bi firotina dozê tawanbar kirin.

Gelek komên aşitiyê ew kom bûn ku tevî komên dildar ên biçûk ji dêran derketibûn û bi niyeta xwe-gihandin bi "yên aliyê din" hatibûn avakirin.

Xala ku li vir divê mirov li hember baldar be ew e ku civatên li Îrlandaya Bakur nexasim çîna karkeran têra xwe ji hev hatibûn veqetandin. Zarokên neteweparêz tenê diçûn dibistanên katolîkan, zarokên Yekîtîparêz tenê diçûn dibistanên protestanan. Ev rewş ji bo çîna karkeran nexasim jî ji bo civatên bajarî derbasdar bû. Mesafeya wan li hev nêzîk e lê cuda cuda dijîn.

Du kolanên paralêl li Belfasta Rojava hene ku di navbera wan de kêmtir ji kîlometreyekê mesafe heye: Kolanên Shankill û Falls. Xala ku herî zêde li hev nêzîk dibin, li wir dêreke katolîk heye: Menestira Clonard.

Clonard bû cihekî ewle ji bo ku rêberên civakî yên her du aliyan bi dizî û bi ewle bikarin li hev bicivin.

Di heman demê de ev der bû yekemîn cih ku rêberê neteweparêz ê miyanrew û pasîfîst John Hume û Gerry Adams cara yekem li wir hev nas bikin, biaxivin û IRA'ya Demkî her li wir gihîşte wê encamê ku tekane rê ev rê ye ji bo pêşvebirina diyalog û aşitiyê.

**Komên Werziş û Ciwanan**

Ciwanên li Îrlandaya Bakur yan ji ber hilbijartina dildarane yan jî ji ber duçarbûnê ji hev veqetiyan û mezin bûn û hatin perwerdekirin. Lewma xebatên komên ciwanan heyatî bûn ku ciwan bi hin xebatan li hev dicivandin ji bo ku çîroka "aliyê din" hîn bibin.

Bi rastî jî, divê ew kapasîte û derfet biçûk neyê dîtin ku dihêle kes çîroka xwe bo civaka din bêje û dengê wan bibihîze; çiku ev yek di mijara birêvebirina pevçûnê de dibe alîkar.

Yaneyên Werzişê her çend bi Peymana 1998'an dest pê kiribin jî, roleke biçûk lê girîng lîstin ji bo ku bibin alîkar di mijara birêvebirina pevçûnê de. Her wekî di perwerdeyê de hebû di gelek werzişan de ji hev hatin veqetandin. Neteweparêz/Komarîxwaz zêdetir di YAG'ê de (Yekîtiya Atletîzma Gaelic) lîstin û piştgîriya wê kirin. Ev kom di nav civatên neteweparêz de xwedî jêrxaneyeke fireh e û li seranserê giravê xwedî kodeke amator e. Yane bi giştî navê lehengên şerê 1916'an weya Şerê Serxwebûna Îrlandayê hildigirin.

Ji Peymana Îniya Bixêr û pê ve YAG'ê ji bo ku xwe bigihîne ciwanên dilsoz hişmendane hewl daye. Rugby jî wisa kiriye. Her çend Rugby li Bakur wek Yekîtîparêz bê pênasekirin jî, tîma Rugby li Îrlandaya Bakur nîne. Lîstikvanên ji Îrlandaya Bakur ji bo Rugby'ya navneteweyî ji bo hemû Îrlandayê dilîzin. Tîm li jêr

alaya sê rengî ya Îrlandayê dilîze lê di lîstikê de li şûna sirûda Îrlandayê ku ji Şerê Serxwebûnê tê û navê wê Sirûda Leşker e, sirûdeke biîxtîlaf tê xwendin ku wek Bangewaziya Îrlandayê tê binavkirin.

**Komên Jinan**

Tevkariya hêja û girîng ji rêxistinên jinan, ji komên jinan, ji destpêşxerî(înîsiyatîf)ên jinan û ji jinên takekesî hat. Ne mumkîn e ku girîngiya wan biçûk bê dîtin.

Her wekî ku min berî niha diyar kiribû, Koalîsyona Jinan a Îrlandaya Bakur bi awayekî karîger partiyeke siyasî û SCS'yek bû; bûbû komek ji wan komên herî girîng û hêja lê ne tenê ev kom hebû.

Gelek bijardeyên din jî hebûn wekî Mala Hannayê (koma sûfrajet a îrlandayî) ku rêxistineke femînîst û rêxistineke avakirina aşitiyê ya wêde-sînor bû. Komê jin li hev dicivandin û ew yek dinirxand bê ka pevçûnê çawa bandor li jiyana wan kiriye.

Wê komê lêkolîn dikir ka pevçûnê çawa bi awayekî cuda bandor li jin û mêran kiriye û bê ka çawa karîne rêxistinên cuda ji bo aşitiyê ava bikin.

Dibe ku ev yek kilîteke rola jinan be. Bêtir bi lez xwe-gihandin bi civakên din ên wekî xwe. Van têkilî û çûnûhatinan hişt ku di nav endamên civatên bakurî de diyalogeke bêtir zengîn pêk were.

Lê zêdetir jî heye. Koalîsyona Jinên Îrlandaya Bakur lîstikvaneke girîng a pêvajoya gotûbêjan bû. Serê pêşîn bi îsrara Koalîsyona Jinên Îrlandaya Bakur hukmên taybet û referans di Peymana Îniya Bixêr de ji bo mexdûran hatine bicihkirin

Dibe ku ev yek ji ber wî tiştî be ku Koalîsyona Jinên Îrlandaya Bakur tekane kom e ku ji her du civakan hevbeşan li xwe digire, her wiha dibe ku ji ber sîstem û rehên wê be.

**Glencree**

Her wekî ku min berî niha diyar kiribû, li rex hebûna gelek komên ciwanan ku hewl dane bibin alîkar ji bo çareserkirina pevçûnê û têkilîdanînê; komên dêr, çand, werziş û SCS'yên din jî ji bo aşitiyê hebûn eger bi awayekî polîtîk ne hevpeyman bin jî nîv polîtîk bûn.

Yek ji yên herî girîng û xweragir ku şanaz im ku bi wan re me Navenda Glencreeyê ji bo Aşitî û Levkirinê ye.

Wek bertekek li dijî pevçûna tund ku li Îrlandaya Bakur di 1974'an de rû da, nexasim piştî şepola bomberêjkirina tirsnak ku di 1972'yan de li Belfastê rû da, hate damezrandin.

Ji damezrandina xwe û bi vir ve, ne tenê li Îrlandayê di heman demê de li herêmên pevçûnan ên seranserê dinyayê diyalogên giştgîr û lihevkirin teşwîq kirine û xebat ji bo aşitiyê kirine.

Bernameyên ku li Centre Glencreeyê tên birêvebirin, qadên perwerdeyê jî tê de di çarçoveyeke berfireh de bûne. Çalakiyên demên betal, bexş, kampên xebatê û mazûvanî bo gotûbêj û nîqaşan.

Piştî ku Peymana Îniya Bixêr di 1998'an de hatiye îmzekirin û bi vir ve, Glencree Centre di teşwîqkirina pêvajoya aşitiyê de ku li Îrlandayê berdewam dike karîger bûye. Di nav wan kesan de ku ji îxtîlafa li Îrlanayê zerar dîtine, gotûbêj û komxebat û nîqaşên bê-hejmar kirin ji bo teşwîqkirina têkiliyên pozîtîf. Kesên ku li van çalakiyan beşdar bûn, di nav wan de şervanên kevn, qurbanî û rizgarên pevçûnan, ciwan, dêr, komên dînî û beşeke berfirehtir a civakê hene.

Tiştê herî girîng ku Glencreeyê wek aktereke civaka sîvîl hîn bûye ew e ku çareseriyeke asayişî ya payîdar (sustainable) ji bo pisgirêkeke polîtîk nikare were peydakirin.

Di gel hewlên her du aliyên pevçûnê li Îrlandayê, dawiya dawî me ferq kir ku tundûtîjî çareseriyeke payîdar çênake ji bo ku em bikarin pêşve biçin. Ya ku tundûtîjiyê çêdike çi komên çekdar ên der-dewlet dibin çi dewlet dibe, ti cihekî wan nîne ku me bibin wir.

Esasen, vê rewşê em xistin korerêyekê û rê vekir ji bo ku em li rêyên nû bigerin da ku em pêşve biçin.

Dersa duyem, ne pêwîst e ku em ji hev bawer bikin ji bo ku dest bi pêvajoyeke aşitiyê bikin.

Ji gelek aliyan ve em li Îrlandayê pir bi hêdî hîn bûn. Me got ku em nikarin vêkra aşitiyê ava bikin. Çima em ji hevdu bawer bikin? Bi salan e em yekdî dikujin.

Di heman demê de kesên ku li ser desthilatdariyê bûn, salên dirêj ev desthilatdariya xwe berdewam kiribûn û kesên ku desthilatdarî ne di destê wan de bû li dijî wan şer kiribû. Me zarokên yekdî kuştin, me cîranên hevdu kuştin û me ji civatên hevdu mirov kuştin. Çima em ji hev bawer bikin?

Wê gelek komîk bûna fikra jihevbawekirinê. Ne pêwîst e em ji hev bawer bikin ji bo ku em aşitiyê ava bikin. Divê hûn bikarin ji pêvajoyê bawer bikin.

Pêvajo salên dirêj e berdewam dike. Xelk dibêje ku pêvajo di dawiya 1990'î de hevdem di gel agirbestê dest pê kir lê pêvajo vedigere demeke gelek ji vê paşvetir.

Dem hebûn ku me ji hevdu bawer nedikir û îro ya rast em hîna jî ji hevdu bawer nakin. Lê belê em di pozîsyoneke wisa de ne ku em hînî birêvebirina pevçûna xwe bûne.

Me nekarî em pevçûna li Îrlandayê çareser bikin, bi awayekî besît em hîn bûn ka em çawa dikarin wê bi rê ve bibin. Birêvebirina pevçûnê di gel kêmkirina tundûtîjiyê têkildar e û afirandina derfetekê ye ku her kes bifikire ku qezenc dike.

Pêvajoya Glencreeyê ev e.

Meyldariya ku di wexta çareserkirina pevçûnekê de derdikeve ew e ku alî hewl didin ku aliyê din bikin bizina gunehan û bi pevçûnan tawanbar bikin.

Glencree tam di vir de, nêrîna wê li yên din cuda ye.

Beşdarî li komxebatên Glencreeyê bi wan kesan sînordar e ku ji bo pevçûnê li pey çareseriyeke bêtundtûtîjî ne; ne ji bo wan kesan e ku dibin alîkarên rêya tundûtîjiyê. Girîng bû kesên ku bikarin rast bipeyivin û fam bikin hebin.

Diviya ev atolye qadên wisa ferasetdar bûna ku li wir rêz li nepenîtiyê bihata girtin û mirovan bikariya hest bikira ku dikarin bi vekirî û semîmî bipeyivin.

Hemû diyalogên li Glencreeyê li ser bingeha rêzika Chatham Houseê pêk hatin. Di nav salan de hin tiştên hûr ên nexwestî çêbûn –û van atolyeyan serdema berî Peymana Îniya Bixêr li xwe digirt. Ji 1994'an û bi vir ve, piştî Peyman û hilweşîna sazûmanên siyasî yên li Bakur gelek valahiyên siyasî çêbûn.

Wek profesyonelekî siyasî, min pê derxist ku tiştê ku Glencreeyê ji rêxistinên aşitiyê yên din ên li Îrlandaya Bakur û Başûr û ji SCS'yan vediqetîne ew e ku siyasetmedaran teşwîq dike û piştgîriya wan dike.

Yên din dem dem bi awayekî tund û tim, ku mafdar bûn, ji siyasetmedaran re digotin ku karekî xirap dikin û rexne li wan digirtin ku berpirsiyarên pevçûnê ne, lê Glencreeyê xwe ji vê yekê bi dûr girt.

Glencreeyê tam eksa vê kir.

Glencree di sala 1994'an de çû ba hemû partiyên siyasî çi ji Îrlandaya Bakur be çi ji Îrlandaya Başûr be û ji wan re got ku Glencree dixwaze di gel wan bixebite.

Glencreeyê ji wan re got ku em alîgiriya tiştekî nakin ku hûn li dijî wê ne, em piştgîriya aşitiyê dikin.

Glencree wek parçeyeke vê pêvajoyê çû ba hemû komên siyasî yên li Îrlandayê û gote wan ku dixwaze peywendiyê di gel wan girê bide.

Siyasetmedat xwedî wan tiştan bûn ku Glencreeyê tunebû. Lê Glencreeyê jî tişt hebûn ku pêşkêşî wan bike û dibe ku wan wê demê hîna ev fam nekiribin jî.

Yanî Glencreeyê ti carî ders nedida siyasetmedaran. Glencreeyê hewl dida ku di gel hemûyan bixebite û wan bigihîne qad û jîngehekê da ku bikarin diyalog û peywendiyê çêbikin.

Bi du helkeftan Glencreeyê îlana tam-rûpel di hemû rojnameyên îngîlîz û îrlandayî de da.

*“Peyamek ji bo hemû siyasetmedarên Brîtanya û Îrlandayê: Em wek kesên ku li jêr îmzeya me heye dixwazin spasiya we bikin ji bo rêbertiya we ya bo Îrlanda û aşitiyê.*

*Dilsozî û fedakariya we bû çavkaniya îlhamê ji bo hemû giravê.”*

Piştre Glencreeyê 300 mirov û kompaniyên herî zengîn ên li Îrlandayê qanî kirin ku vê danezanê îmze bikin.

Ev yek ji bo xurtkirina rêbertiya pozîtîf hewlek bû.

Xebata Glencreeyê li ser avakirina aşitiyê bû ku me fikir dikir ku ji bo pêvajoyê krîtîk e.

Derseke din heye: Bi rastî ti kes tundûtîjiyê naxwaze.

Piştî serdema mutabeqatê, bernameyeke nepolîtîk a Glencreeyê li ser qurbaniyên pêvajoyê bû –ev bername hîna berdewam dike.

Beşek ji van qurbanî û xizmên qurbaniyan ji Glencreeyê pirsîn ka ji bo naskirina hin şervanên kevn dikare mazûvanî û koordîsnasyona bernameyekê bike yan na. Ev bername, di gel koma girtiyên IRA’ya kevn ya bi navê Coiste hate çêkirin.

Coisteyê dixwest van qurbaniyan nas bike û dudiliya wan li ser vê têkilîdanînê tunebû.

Ev yek, her çend ji bo mexdûran dijwar be jî, her çend li dijî xwe yan jî xizmên wan nebe jî, dixwestin di gel wan kesan hevdîtinê bikin ku wekî wan tundûtîjî şuxulandibûn.

Tiştê ku ji vê rûbirûbûnê derket, (ji bilî hin awarteyên gelek kêm) ew bû ku mirovên sade tundûtîjî nedixwestin –lê gava ku hest dikin ku rêyeke din a vekirî nîne, tekane rê tundûtîjî bû.

Ev ne hincetek e, hewlek e bo ravekirinê.

Ez şexsen bûm şahidê van cure rûbirûbûnan. Min şervanên kevn nas kirin û min axaftinên dijwar û ecizker bi wan re kirin.

Her wiha min bi rêya temasên ku li Glencreeyê hatin çêkirin, rêyên girîng ên nîv resmî ji bo ragihandinê pêşve birin.

Hejmarên rayedarên partiyên kilît ên her du aliyan di mobayla min de hene. Eger cihekî wekî Glencreeyê nebûya, ev yek ne mumkîn bû û kesên wekî min ku ji bo aşitiyê di vê komê de dixebitin, piştî ku em li wir beşdar bûn, em ji bo ku bibin alîkar da ku bandorê li rewşên siyasî bikin ku salên dirêj kişandin, me ev temas bi kar anîn ku me bi rêya Glencreeyê çêkiribûn.

Pevçûna Îrlandaya Bakur meseleyeke nasnameyî bû; ji ber têkiliyên şikestî berê xwe dabû tundûtîjiyê.

Glencreeyê dît ku rol û berpirsiyariya wê ew e ku siyasetê dayne aliyekî û bi rêya diyalogên tund xebatê ji bo çakkirina têkiliyên qutbûyî bike.

Siyasetmedarên brîtanyayî, îrlandayiyên başûrî û îrlandayiyên bakurî (paramîlîter jî tê de) diyalogeke tund hebû di navbera me de.

Me berê xwe da pêvajoyeke sê-hêlî ku li ser van têkiliyên şikestî dimeşe;

**1.** Li Îrlandaya Bakur – di navbera du civakan de

**2.** Di navbera du herêmên girava Îrlandayê de, Bakur / Başûr

**3.** Û di navbera du giravan de, Rojhilat / Rojava

Nîqaş bi nepenîtiyeke bilind hatin çêkirin. Mirovan bi hev re peywend û têkilî çêkirin.

Gava ku têkilî di navbera mirovan de pêş ket, têgihîştin û empatî –eger peyman çênebe jî- pêşve çû.

Ev yek gelek girîng bû di demekê de ku rageşî û qeyran diqewimî.

Ev yek girîng e çiku min nexwest resmekî wisa pêşkêş bikim ku ji serî heta dawî bênavber û biîstîqrar pêşveçûn hebû.

Pêşveçûneke bênavber û biîstîqrar çênebû.

Tundûtîjî di 1992, 93 û 94'an de gelek bilind bû. Gelek hovane bû. Li pişt perdeyê, Glencree (û yên din) hewl dan ji bo ku şertûmercan teşwîq bikin da ku tundûtîjiyê rawestînin lê li her derê bombe hebûn.

SCS neçar bûn ku tiştên ku di tevgera Komarê de diqewimîn hewl bidin bi awayê herî baş bixwînin û tim û daîm darazên nirxan pêk bînin.

Lê di vê gavê de, me dawiya stratêjiya du-hêlî (polîtîk / leşkerî) ya li IRA'yê didît –li pey vê rewşê diyaloga Hume / Adams hate pêş ku berî niha min jê behs kiribû.

Piştî vê serdemê, diviya axaftinên dijwartir li ser wê pêvajoyê bihatana kirin ku paramîlîter û şervanên kevn kiribûn tevgera sereke ya siyasî.

Gava ku me paramîlîterên kevn dianîn odeyê, siyasetmedar diçûn. Tevgera sereke ya siyasî naxwaze ji aliyên wan kesan ve ku wek terorîst tên dîtin “qirêj” bibe.

Axaftineke gelek dijwar bû ji bo birêvebirinê. Di serdema 1994-96'an de, Glencreeyê di navbera her du koman de ji du aliyan ve pêşveçûn tomar kir.

Gava ku agirbest têk çû, Glencree neçar ma ji nû ve komekê damezrîne ji bo ku parçeyan berhev bike û paşê bi wan kesan re berdewamiyê bide diyalogê ku bi awayekî çalak ji nû ve li çalakiyên tundûtîjiyê beşdar bûne.

Tiştekî siruştî ye ku gelek nîqaş û rûbirûbûn diviya bi awayekî taybet bihatana kirin. Her çend gelek atolye hebûn ku hemû alî lê beşdar bûbûn, gelek hevdîtinên nepenî jî hebûn ku li ser daxwaza wan aliyan dihatin kirin – ev bi kesên din nedihatin nîşandan- wê demê jî û niha jî her wisa ye.

Li Glencreeyê girîngiya duristbûnê merkezî bû.

Ji ber ku tundûtîjî gelek tund bûn agirbest pêk nehat. Lewma mirovan qadek ji bo diyalogê dixwestin lê gelek tirs jî hebû.

Mijarên ku tên axaftin, bi kê re diaxivin, tiştên ku tên gotin bila bo raya giştî neyên ragihandin di van mijaran de beşdaran dixwest ku xwe di ewlehiyê de hest bikin.

Axaftin têra xwe taybet bûn û girîngiyeke mezin bi hewlên avakirina têkiliyên mirovane hate dayîn.

# Beşdarıya Jınên Jı Cıvaka Sîvîl Lı Pêvajoya Dı Navbera Hukumeta Juan Manuel Santos Û Hêzên Hevpar Ên Gerdûnî Yên Kolombıyayê (Farc-Ep) De

**Luz Piedad Caicedo, Corporación Humanas**

**Stenbol, 3ê Mijdarê 2018**

## Peywend

Dînamîkên pevçûna çekdarî ya navxxweyî li Kolombiyayê, ji pevçûneke navbera komên çekdar derbas kir. Ev yek, tevî bilindbûna rêjeya sîvîlên ku ketine ber bandora şer, di wê yekê de tê dîtin ku bi giştî pevçûna çekdarî îtîbara xwe ji dest da. Nexasim ji naverasta 1990'an ve nifûsa bêçek, ne bi rizamendiyê yan jî bi girêdaneke civakî lê bi rêya zext û mexdûriyetê li tevgerên çekdarî beşdar bû.

Hukumeta Kolombiyayê, di sala 2017'an de qebûl kir ku ji ber pevçûna çekdarî ya navxweyî bi giştî heşt mîlyon û çar sed hezar (8,4 mîlyon) kes bûne qurbanî. Pevçûna li Kolombiyayê awayekî diyar ê tundûtîjiyê qebûl nekiriye: komên çekdar (esasen tevgerên gerîlayî wekî FARC û Artêşa Rizgariya Neteweyî-ELN û komên paramîlîter) di pevçûnan de her cure tundûtîjî bi kar anîne. Van hemû koman rêbazên curbecur bi kar anîn, tawanên şer û tawanên li dijî mirovahiyê kirin û sîvîl kirin qurbaniyên sereke yên şer.

## Pêvajoyên Aşitiyê li Kolombiyayê

Kolombiyayê ne tenê dîrokeke dirêj a pevçûnan heye, belku wê peymanên aşitiyê jî hene. Di sala 1990'î de di gel hin komên gerîlayî çend peymanên aşitiyê hatin îmzekirin, ev: Tevgera 19'ê Nîsanê (M-19), Artêşa Rizgariya Gel (EPL), Tevgera Çekdarî ya Quintin Lame, Bizava Nûbûna Sosyalîst û paramîlîterên Magdalena

Medio û Cordobayê (du herêmên Kolombiyayê). Di sala 2003'yan de pêvajoyeke aşitiyê hate pêş ku hemû komên paramîlîter li xwedigirtin. Îro hin hewl hene ji bo ku di gel koma gerîlayî ya ELN pêvajoyeke aşitiyê bê çêkirin.

Tevî FARC-EP'ê du teşebusên din hebûn ku serkeftî nebûn, ev teşebus: teşebusa yekem, ji aliyê Serok Belisario Betancur ve (di 1982 û 1986'an de li ser desthilatdariyê bû) û ya din jî ji aliyê Andrés Pastrana ve hatibû kirin ku ji 1998'an heta 2002'yan serok bû.

Beşdariyeke gelek berfireh a civaka sîvîl li vê teşebusa dawî hebû; jinan roleke gelek girîng lîst. Nexasim yên li jêr berbiçav in:

• Ji ber fişarên komên jinan û civaka sîvîl di sala 1999'an de di navbera Serok Pastrana û koma gerîlayî ya FARCê de hevdîtin ji bo aşitiyê hatin destpêkirin. Jinên ku lîyaqeta wan a resmî hebû û di nav civaka sîvîl de bûn, cara yekem pêşewa neçar kirin ku di pirsgirêkên zayenda civakî de baldar bin.

• Diyalogên ku di sala 2002'yan de têk çûn, di nav tevgera aşitiyê ya Kolombiyayê de bû sedema hêvîşikeştiyê. Komên jinan hewlên nû didin ji bo ku di mijara maliyetên mirovî yên pevçûnê de agahdariyê çêkin û bangewaziyê ji bo gotûbêjan bikin ku civaka sîvîl li xwe digirin

• Rêxistinên jinan pêvajoyek pêşve birin ji bo pêkanîna hemfikriyê û ji bo pêkanîna rojevekê ku sedemên bingehîn ên pevçûnê yên wekî polîtîk, civakî û ekonomîk gotûbêj dike. Rayedarên xwecihî modelên ku jinan ji bo lihevkirinê saz kirine di meclîsên qanûnî yên Antioquia, Nariño, Cauca û Huilayê de dubare dikin.

• Ji ber ku paramîlîter û gerîla hin herêmên welêt kontrol dikin, pevçûn herêmî bûne. Her çend ku jin bi rêya tundûtîjî û zextan bi armanc têne girtin jî, pêşengiyê ji hewlên berxwedana xwecihî re dikin, peymanên neresmî di gel akterên çekdar pêk tînin û "herêmên aşitiyê" pêk tînin ji bo parastina civatan.

• Komên jin biryara bi jimareya 1325 (2000) ya Encumena Asayişê ya NY bi kar tînin ji bo ku daxwaza beşdarbûnê li peymanên siberojê bikin. Sazûmanên hukmî jî li gorî 1325'an di gel saziyên civaka sîvîl (SCS'yan) di mijara ewlehiyê de diyalog dan destpêkirin.

**Pêvajoya di Navbera Hukumeta Kolombiya û Farc-Ep de**

Pêvajoya aşitiyê ya di navbera Juan Manuel Santos û FARC-EPê di sê qonaxan de pêk hat:

• Qonaxa yekem, temas: Di Tebaxa 2010'an de piştî ku Juan Manuel Santos dest bi peywirê kir bi demeke kin, di navbera hukumeta Kolombiyayê û FARCê de temas çêbû. Di Sibata 2012'an de alî amade bûn ji bo ku li Hawanayê dest bi hevdîtinên veşartî yên keşfê bikin.

• Qonaxa keşfê. Ji meha Sibata 2012'an heta meha Tebaxa 2012'an deh tûrên gotûbêjan li Hawanayê hatin lidarxistin.

Alî di 27ê Tebaxa 2012'an de ji bo îmzekirina rojeva gotûbêjan amade bûn. Tevî rêzikên şênber ên prosedûrên maseya gotûbêjan, rojeveke kurt, arastekirî û rastbîn hebû ku tenê şeş madde (pênc ji bo meseleyên bingehîn û yek ji bo cîbicîkirinê) li xwe digirtin.

• Qonaxa giştî (public): Pêvajo resmen di 18'ê Cotmeha 2012'an de li Osloyê hate destpêkirin.

Piştî vekirina resmî ya li Osloyê, pêvajo birin Hawanayê û di 26'ê Îlona 2016'an de heta ku gotûbêj temam bûn li wir dewam kir. Îro Serok Santos û fermandarê FARC'ê Rodrigo Londono li bajarê Cartagenayê peymaneke aşitiyê îmze kirin.

Di Cotmeha 2016'an de, koma gerîlayî ya Hêzên Çekdar ên Şoreşger ên Kolombiyayê (FARC) û hukumeta Kolombiyayê, piştî ku piraniyeke lawaz a Kolombiyayê di referandûma 2ê Cotmeha 2016'an de peymana aşitiyê red kir, peymaneke nû û revîzekirî îmze kirin.

**Cıvaka Sîvîl li Hawanayê**

Di maseya gotûbêjên Hawanayê de mekanîzmên curbecur hatin çêkirin ji bo ku hemwelatî bikarin li pêvajoya aşitiyê beşdar bin. Ev mekanîzm pêk dihatin ji: forûmên tematîk li bajarên cuda yên welêt, pêşniyar ji bo gotûbêjan bi rêya formên fîzîkî û mecazî (virtual) û pêşniyarên lijneyên ku ji bo civînan dihatin Hawanayê.

Her sê mekanîzman jî tevkariyên girîng û hêja li maseya gotûbêjan kirin. Rexneyên civaka sîvîl a Kolombiyayê ku digot ev mekanîzm gelek sînordar in, piştî ku ev hevdîtin li derveyî Kolombiyayê çêbûn, tundtir bûn. Kesên ku gazinc dikirin, alîgiriya wê yekê dikirin ku mesafeyeke gelek mezin di navbera rastiyên heyî yên li Kolombiyayê û hevdîtinên li Hawanayê de heye û pêwîst e kanalên têkiliyên bêtir resmî di navbera maseya aşitiyê û gelê Kolombiyayê de hebin. Her ku gotûbêj pêşve çûn û maseya gotûbêjan behsa rojeva têkildarî mafên mexdûran kirin, alîgiran biryar da ku îstîşarêyên xwe di gel beşdarên ciyawaz xurt bikin.

Yek ji mekanîzmên herî berbiçav û karîger, diyaloga rasterast a di navbera qurbaniyên pevçûnê û aliyan de bû. Serdanên mexdûran, maseya aşitiyê di gel rastiyên Kolombiyayê kire yek û dînamîkên navbera aliyan guhertin.

Ji bo ku rasterast li hevdîtinên aşitiyê beşdar be, rayeya wê yekê ji bo pênc caran dan NY'yê da ku di gel Zanîngeha Neteweyî û Konferansa Pîskoposên Kolombiyayî hevkariyê bike û serdanên delegasyona mexdûrên 12 kesî organîze bike. Delegasyonan pêşniyarên xwe ji bo aliyan pêşkêş kirin ku rastî û edalet, tezmînat, mutabeqat û gerentîkirina dubarenekirinê li xwe digirtin. Delegasyonan qurbaniyên hemû aliyên îxtîlafa li Kolombiyayê temsîl dikirin. Di heman demê de civat û tor temsîl dikirin. Piştî vegera bo Kolombiyayê, wê bûbûna parêzvanên girîng ji bo çareserkirina îxtîlafê bi rêya gotûbêjan. Her wiha van delegasyonan di demên qeyranan de roleke girîng lîstin wisa ku parastin li pêvajoyê kirin û daxwaz kirin ku alî maseya gotûbêjan terk nekin.

- Pêşkêşkirina pêşniyaran – bi dirêjahiya pêvajoyê 67.371 pêşniyar bo maseya gotûbêjan hatin şandin. Li gorî Ofîsa

Komîseriya Bilind bo Aşitiyê, piraniya mezin a van pêşniyaran bi rêya forûmên tematîk û bi rêya Lûtkeya Jin û Aşitiyê hatin radestkirin. Pêşniyarên ku bi rêya formên fîzîkî weya mecazî hatin kirin, di wan de qeydeke kesên ku pêşniyar pêşkêş kirine heye. Ji meha Nîsana 2016'an ve 6.713 pêşniyar hatin pêşkêşkirin ku 3.701 jê mêr û 1.760 jê jin (%26) bû û di 1.252'yan de jî ev agahî vala hatibû hiştin.

• Forûmên tematîk – maseya gotûbêjan daxwaza pênc forûmên tematîk kirine û ev forûm ji aliyê Kolombiyaya Neteweyî û Neteweyên Yekbûyî ve di navbera 2014 û 2016'an de hatine lidarxistin. Forûma ku li ser geşepêdana çandinî ya giştgîr hate lidarxistin, tê de jinan %33'yê beşdaran temsîl dikirin; di beşdariya siyasî de %40, di forûma çareserkirina pirsgirêka madeyên hişber de %48 (forûmên herêmî jî tê de) di forûma qurbaniyan de %32 (forûmên herêmî jî tê de) û di forûma bidawîkirina pevçûnê, rastkirin û pesendkirinê de %50.

• Delegasyon çûn serdana Hawanayê ji bo ku mijarên ciyawaz di rojeva gotûbêjan de pêş bixin û civînan di gel komîsyon weya jêr-komîsyonan bikin li ser maddeyên ciyawaz ên rojevê. Endamên civaka sîvîl wek pispor li hev civiyan ji bo ku zanyarî û tecrubeyên ku li ser maseya gotûbêjan hîn bûne parve bikin. Ji bo mijarên geşepêdana çandinî ya giştgîr û beşdariya polîtîk tenê mêr hatin gazîkirin. Forûma li ser çareseriya problema madeyên hişber, jinek (%13) li koma 8 kesî beşdar bû û di koma qurbaniyan ya 60 kesî de 36 jin (%46) hene.

Jêr-komîsyona Zayenda Civakî di gel nûnerên 18 jin û rêxistina ciyawaziya cinsî (Kanûna 2014'an û Sibat û Adara 2015'an) sê civîn li dar xistin. Di gel 10 jinên pispor li ser tundûtîjiyên li dijî jinan civînek hate çêkirin (Tebaxa 2015'an), di gel 10 jinên kevn ên serhildêr civîneke din hate lidarxistin ku ji welatên ciyawaz ên cîhanê hatibûn (Gulana 2016'an) û bi beşdariya rêxistinên jinan ên curbecur, siyasetmedar û delegeyên hevkariya navneteweyî di Tîrmeha 2016'an de li Hawanayê di çalakiyekê de ku bo gel vekirî bû encamên xebatan pêşkêş kirin.

## Lijneyên Tevgera Jinan

Piştî pêvajoyeke dirêj a parêzvaniyê, di Peymana Aşitiyê de mumkîn bû ku di her şeş xalên Peymanê de 122 tedbîr hebûn ku perspektîfa zayendî li xwe digirtin: **1.** Reforma Giştî bo Gundewariyê **2.** Beşdariya Siyasî **3.** Bidawîbûna Pevçûnê **4.** Çareserî bo pirsgirêka madeyên hişber **5.** Peyman bo qurbaniyên pevçûnê **6.** Cîbicîkirin, rastkirin û pesendkirin. Destkeftên têkildarî heqîqet, edalet, tezmînat û gerentiyên dubarenebûnê ji bo jinên mexdûrê tundûtîjiya cinsî hatin bidestxistin.

Li Komeleya Humanasê, li gorî lêkolîna ku me li Hawanayê li ser rola jinan kir, daxilkirina perspektîfa zayenda civakî ne ji ber wê nelihevî weya opozîsyonê bû ku car car ji aliyê endamên meclîsê ve dihat kirin lê me ferq kir ku endamên jin ên Jêr-komîteya Zayendê di vê mijarê de xwedî agahiyên têr û tesel nînin.

Xebatên ku komeleyê di gel rêxistinên jinan dikirin roleke stratêjîk lîst lê ne tenê ji ber ku tecrubeyên jinan û parastina mafên mirovan ku jinan dikir dinasand, her wiha ji ber ku vê parêzvaniyê hişt ku ev Jêr-komîte bi xwe hebe. Her wiha rêxistinên jinan bi rêya pêşniyaran xebatên xwe hem ji bo Jêr-komîteyê hem ji bo Maseya Aşitiyê dişandin û li civînên hevpar ên curbecur beşdar bûn ku li Hawanayê hatin lidarxistin; bi vî awayî piştgîrî dan. Bi heman awayî hewlên van rêxistinên li Kolombiyayê yên ji bo daxilkirina pêwîstiyên jinan li rojeva gotûbêjan, tevkarî li wan xebatan kir ku li Hawanayê di çarçoveya axaftinan de hatin kirin.

## Tevkarî, Encam û Serkeftin

Zehmet e ku ronkirineke berfireh li ser hemû tevkarî, encam û serkeftinên jinan bê kirin ku li Hukumeta Neteweyî, li FARC-EP'ê, li sazûmana hevkariya navneteweyî û li delegasyonên welatên gerentor daxil bûne; ji ber ku bandora wan li her aliyê pêvajoya aşitiyê çêbûye. Gelek ji van nexasim ji bo Peymanê bûn, yên din di asta veguherînên takekesî û civakî de û di heman demê de di pêkhatina Peymanê de jî diyar in.

Li gorî kesên ku hevdîtin bi wan re hatine kirin, tevkariya taybet a jinan ku di çarçoveya heşt xetên tematîk ên têkildarî perspektîfa zayenda civakî de li pêvajoya aşitiyê kirin, rengê xwe daya Peymana Nîhaî.

Heşt xetên tematîk ku ji aliyê Jêr-komîteya Zayenda Civakî ve ji bo ku perspektîfa zayendê di Peymanê de were bicihkirin hatibûn diyarkirin wiha ne: **(1)** Gihandina milkiyeta gundewarî di şertên wekhev de bi mirovan û resmîkirina wê **(2)** Di qada gundewar de desteberkirina Mafên Ekonomîk, Civakî, Çandî û Jîngehî ji bo jin û meyla cinsî weya kesên xwedî nasnameya zayendê **(3)** Teşwîqkirina jinan ji bo ku li qadên temsîl, biryardan û çareserkirina pevçûnê beşdar bin **(4)** Tedbîrên pêşîgirtin û parastinê ji bo wan rîskên taybet ku jin rû bi rûyê ne **(5)** Gihîştin bi rastî, edalet û tezmînatê û gerentiya dubarenebûnê **(6)** Nasîna raya giştî, rakirina lekedarkirinê û berbelavbûna xebatên jinan wek mijarên siyasî **(7)** Polîtîkayên sazûmanî ji bo xurtkirina rêxistinên jinan û tevgera LGBTÎ **(8)** Sîstemên cuda yên zanyariyan. Ev xet di 24'ê Tîrmeha 2016'an de hatin ragihandin.

Jinan têkildarî reformên gundewarî yên giştgîr diyar kirin ku qada sereke ya eleqeya wan ew e ku jinên li qadên gundewar zêdetir bigihîjin ax, krêdî û alîkariyên teknîk û bêne xurtkirin; di gel vê yekê cext kirin ku eleqeya wan li ser mijarên resmîkirina milkeyetê ye jî. Bi vî awayî hewl dane ji bo ku jin di şertên wekhev de ji hukmên Peymanê bikarin sûdê wergirin: Fona Erdan, Pîlana Şêwesaziya Mezin a Milkiyetê û bernameyên Geşepêdana Civakî. Bi heman awayî hizir kirine ku rêxistinên jinan ên gundewariyê di vê qonaxa Peymanê de divê li hemû astên cuda yên diyarkirî beşdar bin.

Gava ku behs tête ser beşdariya siyasî, hevdîtinkaran şanazî bi wê yekê dikir ku rastiya hebûna astengên bêhejmar ên li ber beşdariya jinan û astengên li ber bikaranîna desthilatdariyê û berdewambûna cudakariya li ber beşdariya pêvajoyên biryardanê dane qebûlkirin. Serkeftinên din ên bingehîn; teşwîqkirina jinan bo beşdariya siyasî, wergirtina tedbîrên taybet bo parastina parêzvanên mafên mirovan û pêşengan û berbelavkirina kartên hemwelatîbûnê bi awayekî cemawerî.

Di xala dawî ya pevçûnê de, nexasim têkildarî agirbesta du-hêlî û bêşert û bidawîbûna dijminatiyan, tevkariya jinan di van xalan de ew bû ku cih bidin tundûtîjiya ji ber zayenda civakî û binpêkirina kirinên tundûtîjiya cinsî. Di gotûbêjên têkildarî mexdûrên pevçûnê de, jinan di gel bicihkirina mafên mexdûran li navendê, bicihkirina girîngiya tundûtîjiya cinsî li navendê û rengvedana van li Dadgeha Taybet bo Aşitiyê wek serkeftineke girîng qebûl kirin. Di Komîsyona Pêkvejiyan û Dubarenebûnê de ew madde hatin bicihkirin ku tawanên cinsî nekevin ber ef weya lêborînê. Nexasim di vir de jinan tevkariyên girîng ên rêxistinên jinan qebûl kirin.

Tevî hin serkeftinan ku di xalên cuda yên Peymana Nîhaî de şênber bûn, hevdîtinkaran cext kirine ku Jêr-komîteya Zayenda Civakî serkeftî bûye ji bo ku Jêr-komîte bikarin xebatên xwe bi awayekî serkeftî temam bike ku bingeha Peymanê pêk tînin:

- Berî her tiştî, Jêr-komîteyê di gel endamên civaka sîvîl civînên taybet çêkirin ji bo ku xebatên xwe di xalên diyarkirî yên rojevê de xurt bikin. Ev yek serkeftinek bû; ji ber ku gava ku Jêr-komîte hate pêkanîn, dihat pêşbînîkirin ku wê tenê delegasyoneke pênc kesî hebe ku ji qurbaniyên beşdariya civaka sîvîl pêk tê; lê belê karî sê civînên din di gel rêxistinên jinan û lgbtî bike. Yek ji van, bi beşdariya pisporên neteweyî yên mijara tundûtîjiya cinsî û bi beşdariya nûnerên rêxistinên jinan weya rêxistinên tevlihev û bi beşdariya komên serhildêr ên şervanên jin ku ji welatên cuda hatibûn pêk hat.

- Duyem, organîzekirina çalakiyeke pilebilind ji bo pêşkêşkirina encamên xebatên Jêr-komîteya Zayenda Civakî. Jinên ku hevdîtin bi wan re hatin kirin, beşdariya nûnerên jin ên Neteweyên Yekbûyî (di asta navneteweyî de Phumzile Mlambo-Ngcuka, di asta herêmî de Luiza Carvalho û di asta neteweyî de Belé n Sanz); beşdariya Maria Emma Mejia Balyoza Neteweyên Yekbûyî ya Kolombiyayê; beşdariya nûnerên rêxistinên jinan ên kolombiyayî; di gel yên din beşdariya welatên kefîl û beşdariya nûnerên Norvêç û Kûbayê li rêûresma pêşkêşkirina

xebatên Jêr-komîsyonê bo raya giştî girîng dibînin ji ber ku beşdariya wan hem piştgîrîya navneteweyî nîşan dide hem jî nîşan dide ku perspektîfa zayendê ya rêxistinên jinan li peymananê hatiye daxilkirin. Vê civînê selmand ku xebata ku hatiye çêkirin ne di asta duyem de, berevajî vê yekê bi qasî xebatên din girîng e ku bi dirêjahiya pêvajoyê hatine kirin.

- Serkeftina sêyem a bingehîn a Jêr-komîteya Zayenda Civakî ew e ku wek referansek di çarçoveya pêvajoyên aşitiyê yên navneteweyî de tê bicihkirin û pevçûn çareser kiriye û wek referansek ku ne tenê ji ber girîngiya wê ya dîrokî ya di çarçoveya pêvajoya aşitiyê de, her wiha daxilkirina riwangeha zayendî ye li Peymana Nîhaî. Jin û rêxistinên jinan ku hevdîtin bi wan re hatin kirin difikirin ku jin dikarin di pêvajoyên aşitiyê yên siberojê de tecrubeyên wekî van teşwîq bikin û her wiha bi fikra wan ev yek nimûneyeke erênî ye di warê beşdariya jinan û wekheviya zayenda civakî de.

- Çarem, bi fikra hevdîtinkaran piştevaniya ku ji delegasyonên Hukumeta Neteweyî û FARC-AP'ê digirin, her çend li ser çarçoveya vê piştevaniyê hemfikr nebin jî, encameke girîng a xebatên hertimî ya Jêr-komîteyê ye. Di gel vê yekê, vê rewşê hiştiye ku xebatên ku jinan di Jêr-komîteyê de di qada giştî de kirine û beşdariya wan a li pêvajoya aşitiyê ji aliyê xebatkarên mêr ên aşitiyê ve jî bên naskirin. Her wiha, jin hizir dikin ku xebatên wan ji aliyê rewşa navxweyî ya pirsgirêkên jinan ve di her du delegasyonan de veguherîn çêkiriye. Nexasim, jinên delegasyona FARC-EP'ê, piştî egzersîza fikrî ku Jêr-komîteyê çêkir, hizir dikin ku organîzasyonê bi daxilkirina mafên jinan û bi teehhutkirina wekheviya zayenda civakî biryareke "veger-nabe" wergirtine.

- Wek dawî, ev lîsteya serkeftinan divê van xebatan li xwe bigire: xebatên ku ji aliyê Jêr-komîteya Zayenda Civakî ve hatine kirin, bandora rêxistinên jinan û daxwazên wan ku bingeha beşdariya jinan li cîbicîkirina Peymana Nîhaî pêk tînin. Jin ji bo ku serkeftinên wan di wexta cîbicîkirinê de ji nav neçin, qanî bûne ku bandora xwe li cîbicîkirinê berdewam bikin.

**Referans**

Corporación Humanas & CIASE (2017). *Monitoring Report on Resolution 1325. Colombia 2016-2017,* Bogotá, Corporación Humanas & CIASE.

Fajardo, J. & Suescún, J. (2017). *Experiences, Contributions, and Recognition: Women in the Peace Process in Havana.* Bogotá, Corporación Humanas Colombia & Corporación CIASE.

GMH (2016). *BASTA YA! Colombia: Memories of War and Dignity, Bogotá,* CNMH.

Nylander, D., Sandberg, R., Tvedt, I. (2018). *Designing peace: the Colombian peace process.* NOREF. https://noref.no/Publications/Regions/Colombia/Designing-peace-the-Colombian-peace-process.

Rojas, C. (2004). *In the Midst of War: Women's Contributions to Peace in Colombia.* Women Waging Peace Policy Commision.

## “Rolên Civaka Sîvîl Di Çareserkirina Pevçûnan De. Zehmetî Û Derfetên Li Ser Rêya Avakirina Aşitiyê” Sîmînara “Tecrubeyên Scs’yên Navneteweyî Di Atolyeyên Çareserkirina Pevçûnan De” Ku Ji Aliyê Weqfa Aşitiyê Ve Hate Lidarxistin

## Ana Villellas, Stenbol 3 Mijdar 2018

Rojbaş. Ez gelek kêfxweş im ku îro li vir li ba we me. Dixwazim spasiya Weqfa Aşitiyê bikim ku vê sîmînarê li dar dixe û ez gazî kirime.

Ez ê di vê pêşkêşiyê de li jêr ronahiya wan dersan hin fikran li ser rolên civaka sîvîl di çareserikirina pevçûnan de parve bikim ku li seranserê dinyayê ji dînamîkên pêvajoyên pevçûn û aşitiyê derketine. Ez ê ji lêkolîna çalakî-arastekirî (action-oriented) ya Dibistana Çanda Aşitiyê ya Zanîngeha Xweser li Barselonayê, Îspanya, dest pê bikim ku ez lê dixebitim. Ez tercîh dikim ku ev forûm îro bibe axaftineke pir-alî ku em hemû, fikrên xwe yên afirîner veguhêzin hevdu. Ez dixwazim ji pirsiyar û fikrên we hîn bibim.

Serê pêşîn, her wekî Weqfa Aşitiyê dibêje, ez ê ji avakirina aşitiyê û siruşta pêvajoyên aşitiyê û hin meylên çareserkirina pevçûnan dest pê bikim. Piştre ez ê behsa rol û fonksiyonên potansiyel ên civaka sîvîl di çareserkirina pevçûnan de bikim.

Fikra yekem di vê mijarê de: **Çêkirina diyalogê di bin çarçoveyeke lihevkirî de dê bibe rêya herî berbelav ji bo xilaskirina pevçûnên tund.** Li gorî salnameya *Hevdîtinên Aşitiyê yên Berbelav* li seranserê dinyayê di sala 2017’an de 43 hevdîtinên aşitiyê çêbûne. Hemû rûdawên ku hatine analîzkirin (yek ne tê de), hukumetên welatên peywendîdar yek ji aliyên hevdîtinan bûn.

Gelek caran, komên çekdar jî (rêxistinên şexsî weya koalîsyon weya sîwan) li hevdîtinan beşdar bûne. Li piraniya mezin a pêvajoyên aşitî û gotûbêj(muzakere)yan aliyekî sêyem daxil bûye (ji 43 hevdîtinan li 35'an beşdar bûne ku dike %81). Di rêjeyeke biçûktir a wan gotûbêjan de ku di sala 2017'an de hatine tehqîqkirin (şeş doz ku dike %14), rasterast di navbera aliyan de pêk hatiye weya li ser navbînkariya hêla sêyem weya li ser hewlên wê yên hêsankar ti delîlek nehatiye dîtin. Rêxistinên herêmî û bi qasî rêxistinên herêmî dewletên sêyem jî tê de, rola ku rêxistinên nav-hukumetî wek hêla sêyem di gotûbêjan de lîstiye girîng bû. Di nav akterên sêyem de, Civata Sant'Egidio (Casamance) li Senegal û Mozambîkê, Vatîkan li Wenezuellayê yan jî akterên dînî wekî rûspiyên dînî li Komara Efrîqaya Naverast hebûn. Pêşveçûn û paşveçûn di pêvajoyên aşitiyan de çêdibin. Navbînkarekî pilebilind ê NY got ku pevçûnên nav-welatî bi giştî 10 ta 50 salan berdewam dikin. Heçî pêvajoyên aşitiyê ne, berî ku bikevin cîbicîkirinê, 10 ta 20 salan berdewam dikin. Ev pêvajoya dirêj peywendîdar e li gel zehmetî û tengijeyên derbaskirina pozîsyonên dijhev û tundûtîj bo çarçoveyeke hevpar a lihevkirî.

Aboriyên şer ên wekî li Kolombiya, Komara Demokratîk a Kongoyê yan jî li Lîbyayê û her wiha şertûmercên aloz ên jeo-polîtîk û jeo-stratêjîk, dibin sedema bicihbûn û dirêjbûna pevçûnan, eger em navê çend welatan bînin, her wekî pevçûnên li Ûkrayna, Sûriyeyê yan jî li Yemenê. Di gel zehmetiyên diyalogan, pir kêm caran aliyekî pevçûnan xwe ji aliyê leşkerî ve ferz dike û gava ku ev yek jî çêbû, wekî ku li Srî Lankayê rû da, statûya navneteweyî weya ewlehiya hemû mirovên li welêt, veberhênanên aboriyê yên derekî jî tê de, bi awayekî cîddî jê bandorê digirin her çend xweparastin ji encameke wiha mumkîn e. Wekî li Fîlîpîn (MILF) û Kolombiyayê –tevliheviyên ku bi dehan salan ji ber dînamîkên tundûtîj û binyada aloz berdewam kirine- bûyerên van demên dawî nîşan dan ku **diyalog ne tenê gava ku şertûmerc bi awayekî xwecihî bên qebûlkirin tê daxwazkirin,** her wiha nîşan dan ku diyalog mumkîn e jî. Em dikarin bibînin ku xebata civaka sîvîl ji bo çareserkirina pevçûnan dihêle ku pabendî avakirina aşitiyê be.

Fikra Duyem. **Avakirina aşitiyê û pêvajoya aşitiyê gelek zêdetir e ji maseyên aşitiyê; di heman demê de pêvajoyên aşitiyê hîna bi radeyeke zêde girêdayî wê yekê ne ku aliyên pevçûnan xwazyar bin ji bo ku li maseyê rûnin û dest bi pêvajoya diyalogê bikin.**

Avakirina aşitiyê dikare wek pêvajoyên pir-alî bê famkirin ku di gelek astan de gelek akter bi rê ve dibin ku hewl didin pevçûnan çareser bikin û sedemên wan ên bingehîn bi rêyên aşitiyane veguherînin. Lewma ev yek meydaneke gelek berfireh e ku gelek rol û fonksiyonên potansiyel ên civaka sîvîl di vê meydanê de di hemû astên pevçûnê de hene serdemên tundbûnê jî tê de. Ji aliyê din ve, gotûbêjên aşitiyê ew pêvajoyên diyalogê ne ku herî kêm di navbera du aliyên pevçûnan de di nav çarçoveyeke lihevkirî de ciyawaziyên xwe nîqaş dikin ji bo ku dawî li tundûtîjiyê bînin û çareseriyeke tetmînkar peyda bikin da ku daxwazên wan cî bi cî bike. Çareserbûna pevçûnan bi wê yekê ve girêdayî ye ku hukumet û akterên çekdar ên derveyî dewletê qebûl bikin ku bikevin diyalogê. Lewma rola civaka sîvîl zêdetir ji diyarkerbûnê divê wek piştgirîker bê famkirin. Di heman demê de, ev rol dikare gelek girîng be ji bo tevkarîkirin li veguhestina bûyerên tundûtîjiyê ber bi derfetên aşitiyê. Her wiha ne tenê behsa hêmanên diyar ên pevçûnê dike, di heman demê de dikare bibe alîkar ji bo veguhertina çarçoveya peywendiyan. Û wexta ku pêvajoyên aşitiyê dest pê kirin, bi rêbaz û astên ciyawaz û bi awayekî karîger beşdarbûna civaka sîvîl li van pêvajoyan dikare derfetan zêde bike ji bo gihîştin bi peymanekê. Her wekî ku lêkolînan nîşan daye civaka sîvîl tevkariyê li paydarî(sustainability)ya pêvajoyê dike û rewabûna wê ya civakî zêde dike (Paffenholz, O'Reilly…).

**Berî ku em behsa rol û fonksiyonên potansiyel ên civaka sîvîl bikin, em parantêzeke vekin** ku behsa têgeha civaka sîvîl dike. Civaka sîvîl, dikare wek komestêreke berfireh bê famkirin ku sazûman(institution)ên dînî û rûspiyên dînî, sendîka, rêxistinên karî, weqf, rêxistinên pîşeyî û organên wan, tevgerên jinan, sazûmanên perwerde û lêkolînê, binyadên tradîsyonel, navendên çandê, akterên çandî û yên din li xwe digire. Pênaseyek gerdûnî ya hevpar nîne, lê belê girîngiya wê di siruşta berfireh a

civaka sîvîl de veşartî ye. Rêxistinên civaka sîvîl ji ber siruşta xwe ne avakerên aşitiyê ne, hinek ji wan dikarin piştgiriya wan stratêjiyan bikin, wan teşwîq bikin û mafdar nîşan bidin ku pevçûnên tundûtîj tundûtîjiyê li xwe digirin. Akterên civaka sîvîl di gelek pevçûnan de ji bo teşwîqkirina çareseriya aşitiyane li seranserê cîhanê seferber bûne.

Akterên navneteweyî bi giştî zengîniya komên piştgîr û xwecihî yên civaka sîvîl piştguh dikin. Akterên civaka sîvîl ên xwecihî yên li bajarên mezin carinan dikarin akterên civaka sîvîl û ezmûnên wan piştguh bikin ku li welatên wan bi xwe çêbûne. Kolombiya û di rûdawên din de em girîngiya **"aşitiya herêmî"** hîn bûn. Ji ber ku pevçûn di asta herêmî de bi şêweyên ciyawaz û taybet karîger in, avakirina aşitiyê girîng e ku ji qadên ciyawaz ên herêma pevçûndar, ji akterên ciyawaz ên navçeyan, ji şaredariyan -yan jî her wekî di nimûneya Kolombiya û di gelek pevçûnên din de- ji herêmên cografîk derkeve meydanê. Her wiha sedemên gelek pevçûnên din vedigerin bo taybetmendiyên çarçoveya dînamîkên pevçûnan û dînamîka civakî, polîtîk û ekonomîk a her parçe erdekî. Bo nimûne, Tora Hêza Aşitiyê ya Efrîqeya Rojava (WANEP), rêxistineke herêmî ye ku li Efrîqeya Rojava –Nîjerya û Malî jî tê de wek welatên ku ji pevçûnan bandorê digirin- li ser bingeha nirxên neteweyî hatiye avakirin. Wan di nav gelek rêbazên avakirina aşitiyê de sîstema hişdariya zû (early warning system) ji wan nîşaneyan çêkirin ku jêr-bo-jor hatiye pêşvebirin û taybetmendiyên ciyawaz ên herêman li ber çav digire.

Fikra sêyem. **Rol û fonksiyonên ciyawaz ên civaka sîvîl hene ku dikarin di çareserkirina pevçûnê de pêk bînin.** Rêyên ciyawaz hene ji bo fikirîn li ser van rolan. Akadêmîsyenên wekî Thania Paffenholz û tîma wê û xebatkarên aşitiyê 7 fonksiyonan ji bo avakirina aşitiyê pênase dikin ku divê li ber çav bêne girtin:

- *Parastin:* çalakî û înîsiyatîf ji bo parastina hemwelatiyan ji tundûtîjiya hemû aliyan

- *Çavdêrîkirin:* înîsiyatîf ji bo çavdêrîkirina rêzgirtina mafên mirovan weya çavdêrîkirina sîvîl li pêvajoyên agirbestê, çavdêrîkirin li peymanên xwecihî û hwd.

- *Parêzvanî:* seferberî, bi stratêjiyên ciyawaz diyalog li gel medya û yên wekî wê û çalakiyên parêzvaniyê ji bo bidawîkirina tundûtîjiyê

- *Civakîbûn:* sazûmanên civakîbûnê yên resmî û neresmî yên wekî dibistan, komên baweriyê û hwd. jî tê de, înîsiyatîf ji bo belavkirina nirxên aşitî û pêkvejiyanê

- *Hemahengiya nav-komî:* înîsiyatîf ji bo avakirina piran di navbera wan koman de ku pevçûnan ew veqetandine

- *Hêsankarî:* înîsiyatîf di astên curbecur de agirbesta asta xwecihî jî tê de ji bo ku di pileya mîkro de diyalog pê re pêk were û hêsankariyê ji bo diyalogê bike

- Xizmetguzarî ku dikare bi awayekî berwarî hestyariya pevçûnan û armancên avakirina aşitiyê bike yek.

Hinek ji we yan jî hûn hemû bi vê polênbendiyê nas in; ji ber ku Weqfa Aşitiyê ev modêla 7 fonksiyonî bi kar aniye û bi hûrgilî xebatên civaka sîvîl li Tirkiyeyê vekolîn kirine, ez ê tiştê ku hûn berî niha li ser xebitîne dubare nekim.

Norbert Ropersê navdar ku ji bo aşitiyê xebitiye, dibêje ku pêwîstiya pevçûnên çekdarî yên dirêj-kêş bi hewlên avakirina aşitiyê heye ku pir-parçeyî ne û demê digirin. Cîbicîkera aşitiyê û akadêmîsyen Catherina Barnes, li ser bingeha ezmûna xwe ya zêdetir ji 30 welatî û avakirina aşitiya pir-alî, pênaseya rol û fonksiyonên curbecur ên civaka sîvîl dike.

Ev van li xwe digirin: **hêza berxwedanê li hember tundûtîjiyê ku dê rê li ber guhertinan veke, hêza îfşakirinê, hêza ve-çarçovekirinê(reframe) û hêza îfşakirin/enelîzkirin/pêşniyarkirinê. Ez ê vê yekê bi hûrgilîtir pêşve bibim û li ser bingeha lêkolîn û çavkaniyên datayên vekirî (open-data) ji bo her yekê mînakan parve bikim:**

**A) Hêza berxwedanê li hember tundûtîjiyê ku dê rê li ber guhertinan veke,** di asta neteweyî weya mîkro de û di asta civatan de. Hin mînak:

•**NEPAL** Di sala 2014'an de SCS'yên neteweyî û navneteweyî û gelek hevpişkan, Fona Zarokan a YE jî tê de, ji bo nasandina dibistanan wek herêmên aşitiyê kampanyayek dan destpêkirin. Parêzvaniya kampanyayê di ragihandina neteweyî de kirin, xebatên lobîgeriyê hem di nav artêşê de hem jî di nav komên çekdar ên maoîst de kirin û dawîyê jî li gel partiyên siyasî û nûnerên hukumetan li ser rêzikên exlaqê ku di gelek qadan de dibistanan wek herêmên bêpevçûn qebûl dikirin, gotûbêj bi rê ve birin.

•**SRÎ LANKA** Di sala 1998'an de, Pilingên Rizgariya Tamîl Îlamê (PRTÎ), ku komeke çekdar e, hêriş birin ser baregeha leşkerî ya Srî Lankayê li Kilonochchiyê. Ji ber ku hingî leşkerên artêşê nasname bi wan re tunebû, hate ragihandin ku 609 personelên leşkerî winda ne. Di nav wan de, kurê Visaka Dharmadasa jî hebû. Visaka, hest kir ku şer hatiye û gihîştiye ber deriyê wî. Dêûbavên leşkerên winda, notirvan jî tê de, li hev civiyan bê ka dikarin çi bikin ji bo parvekirina êşên xwe û peydakirina zarokên xwe. Civînan hişt ku Komeleya Dêûbavên Leşkerên li ser Peywirê Windabûyî (DLPW) pêk were. Tedbîrên parastinê jî tê de guhertinên rêziknameya artêşê sererastkirin. Piştre Visaka Dharmadasa ji bo teşwîqkirina diyalogê di navbera hukumet û gerîlayan de li gel PRTÎ dest bi hevdîtinê kir. Pêşengî ji hemû delegasyonên sîvîl ên jinan re kir ku karîn li gel PRTÎ hevdîtinê bikin. Hemûyan ezmûnên xwe parve kirin. Koma yekem a civaka sîvîl bû ku karî biçe ba PRTÎ. Vê rûbirûbûnê rê li ber agirbest û hevdîtinên aşitiyê vekir ku dê piştre li gel hukumetê pêk werin. Visaka û endamên din ên komeleyê berdewamî dan têkiliyên xwe yên li gel nifûsa sîvîl a Tamîlê. Tamîlê got ku dest bi famkirina êşa jinan kiriye ku jin dikêşin. Piştî wê, Komeleya Dêûbavên Leşkerên Winda, Komeleya Jinên Bandorgirtî yên Şer ava kir. Vê komeleyê wek toreke jinan kar kir ku kur weya mêrên xwe di her du aliyên pevçûnan de ji dest dane. Em dizanin ku şerê li Srî Lankayê piştî salan bi wêrankariyeke leşkerî û bi awayekî dilsoj bi dawî bû. Komeleya Dêûbavên Leşkerên li ser Peywirê Windabûyî (DLPW) û yên din nîşan dan ku bi rêyên wêrek û afirîner li dijî tundûtîjiyê diyalog û berxwedan dikare mumkîn be. Bi vê helkeftê (by the way), Visaka Dharmadasa, yek ji jinên pispor ên tora zayenda civakî ya Aliyê Global e.

•**SOMALÎ** Di nîveka sala 1993'yan de, di şerekî bingeh-klan de li herêma Wajir, jinên klanên cuda li ser fikra bazareke ewle li hev kirin: Bazar diviya ji bo jinên hemû klanan ewle bûya. Komîteyek biçûk ava kirin ji bo çavdêrîkirina bazarê û çareserkirina pirsgirêkên mûhtemel. Her wiha Yekîtiya Wajirê ji bo Aşitiyê avakirin. Piştre tevî akterên din (salmend, ciwan, karsaz, rûspiyên dînî yên xwecihî) Komîteya Aşitî û Geşepêdanê ya Wajirê pêk anîn. Biryar li ser agirbestê hate dayîn. Komîte di heman demê de her çend li gel pirsgirêkên ciddî rûbirû mabe jî, karî rêyan ji bo parastina gundan peyda bike.

**B)** Hêza îfşakirinê: Akterên civaka sîvîl, li ser bingeha otorîteya exlaqî û rewabûnê, dikare tevkariyê li pêşvebirina hişmendiyê bike ji bo ronîkirin û derxistina rewşên îstîsmar û tundûtîjiyê, veguhertina pasîftî weya bêcezatiyê û bandora neyînî ya tundûtîjiyê. Hin mînak:

•**KOLOMBIYA** Tevgera cemawerî ya jinan "Ruta Pacífica de Mujeres" (Rêya Aşitîxwaz a Jinan) ku ji neh herêman zêdetir ji 300'î rêxistinên jinan tê de cih digirin û xwedî înîsiyatîfên pêşeng û dirêj-kêş ên aşitiyê, di sala 2010'an de, pêvajoyek da destpêkirin ji bo xebitîn li ser heqîqet û hefizeya tundûtîjiya ku di pevçûnan de li dijî jinan hatiye kirin. Înîsiyatîfek bû ku ji sifirê dest bi xwe-rêxistinkirinê kiribû û li ser ezmûnên zêdetir ji 1000 jinî lêkolîn dikir ku ji herêmên ciyawaz û jîngehên civakî yên ciyawaz ên welêt hatibûn. Ji bo wan ev yek pêvajoyeke hefize û rayedarkirinê bû. Ev pêvajoya lêkolînê di demekê de hatibû kirin ku pevçûna çekdarî hêşta çalak bû. Ev lêkolîn, piştî îmzekirina peymana aşitiyê di sala 2016'an de, tevkariyê li xebatên heyî dike ku li ser hefizeyê tên kirin.

**C)** Hêza ve-çarçovekirinê: Ev yek têkildar e li gel kapasîteya civaka sîvîl ji bo veguhertina rewşa pevçûnan, îmaja dijmin û şîroveya qaşo nehemaheng da ku ji nû ve tevkariyê li sererastkirina têkiliyan bike û perspektîfa yên din fam bike. Norbert Ropers van pêvajoyan wek hînbûna empatîk pênase dike. Hêza ve-çarçovekirinê, bi rêya pêvajoyên diyalogê di asta civakê de yanî bi lihevkomkirina mirovên aliyên ciyawaz ên pevçûnê dikare pêk were. Ev bi giştî ew kes in ku xwedî paşxaneyeke hevpar a pîşeyî-

ne (mamoste, rojnameger, akadêmîsyen, siyasetmedar, xebatxane) û ew kes in ku di taybetmendiyên nasnameyî de hevpar in (ciwan, jin) yan jî otorîteyên exlaqî (rûspiyên dînî û hwd). Rêbaza çalak û empatîk a guhdarkirinê di diyalogan de tê bikaranîn ku di asta civakê de pêk tên. Ev yek rê li ber veguherîna şexsî û hilweşîna îmaja dijmin vedike. Her wekî John Paul Lederach dibêje, "Di demên zor û kêmtir zor de, avakirina aşitiyê, yekbûna wan kes û pêvajoyan li xwe digire ku berevajî vê yekê nikarin bêne ba hev". Perwerdeya aşitiyê di heman demê de rêyeke bihêz e ji bo ve-çarçovekirina pevçûnan. **Hin nimûne ji Hêza ve-çarçovekirinê:**

•**ÎSPANYA** Ahotsak (peyva "deng" bi zimanê baskî), tevgerek bû ku di 2000'an de derket û bangewaziya wê yekê kir ku di nav lêgerîna çareseriya pevçûna Baskê de roleke mezintir bo jinan bê dayîn. Wek înîsiyatîfeke jinên siyasetmedar ên li parlamentoya Baskê, ku ji aliyên ciyawaz ên pevçûnan pêk hatibû, derket ku bi guhertina rewşa heyî ya tundûtîjiyê, bi şikandina dînamîkên tecrîdê, bi pêşvebirina vegotineke nû û bi teşwîqkirina pêvajoya aşitiyê qanî bûbûn. Bi wê yekê qanî bûbûn ku "divê hin tişt bên kirin". Wek nêzîkbûneke veşartî di navbera parlamenterên aliyên ciyawaz ên siyasetê de dest pê kir ku piştre hin MPyên din ên jin bi awayekî veşartî beşdar bûbûn û piştre jî jinên din jî beşdar bûn ku ji sendîka û rêxistinên femînîst hatibûn. Ew pabendî wê metodolojiyê bûn ku xwe dispêre prensîba "xebat li ser tiştê komker ne li ser tiştê cudaker". Di çarçoveya agirbesteke nû û pêvajoyeke nû ya aşitiyê de berê xwe dan xelkê, komên xwecihî hatin pêkanîn, parlamenterên opozîsyon ên pevçûnan bajar yek bi yek ziyaret kirin û pêşkêşiyên hevpar kirin ji bo tevkarîkirin li ve-çarçovekirina helwestên pevçûnxwaz. Di çalakiyên giştî de, jinên xwedî paşxaneyên cuda ezmûnên xwe yên êş û kederê û daxwazên xwe yên aşitiyê parve kirin. Di gel hebûna zehmetiyan, van înîsiyatîfan tevkarî li zindîkirina têkiliyan û xurtkirina daxwaza hevpar a aşitiyê kir. Çi heyf ku ew pêvajoyên aşitiyê serkeftî nebûn ku hingî hatibûn destpêkirin. Lê aşitî piştî çend salan pêk hat. Wexta ku em li raboriyê dinêrin, pêvajoya heyî ya aşitiyê ya li Herêma Baskê, guhertinên wan helwestên pevçûnan ku înîsiyatîfa jinan piştgirî dikir jî tê de, wek encameke înîsiyatîfên piralî tê dîtin ku bi demê re di astên curbecur de çêbûbûn.

•**KOLOMBIYA** Li Kolombiyayê, berî ku Serokê berê Santos bi biryarnameyekê bê pesendkirin, xebata kursiyên aşitiyê li hemû sazûmanên giştî û taybet, bikaranîna peyva "aşitî" û "perwerdeya aşitiyê" gelek metirsîdar bû. Demên ku zehmetî çêdibûn, perwerdekarên aşitiyê yên kolombiyayî, ji bo berdewamîdan bi xebatên avakirina aşitiyê, "hemwelatî" "pêkvejiyan" (convivencia) jî tê de, neçar man ku têgeh û peyvên din bi kar bînin. Rêyên afirîner pêşve birin ji bo çareserkirina pevçûnan di asta xwecihî de. Hinek ji van ev in : Komeleyên "Dibistanên Aşitiyê"(Escuelas de Paz) ku mamosteyên ji asta ciyawaz ên perwerdeyê li xwe digirtin weya Tora Perwerdekarên Aşitiyê (Red de Educadores para la Paz). Di hin demên diyarkirî de perwerdekarên aşitiyê ji sazûmanên xwecihî yên wekî şaredariya Bogotá piştgirî girtin. Navenda min jî tê de, perwerdekarên ku ji welatên din hatibûn, tevî perwerdekarên aşitiyê yên kolombiyayî bûn xwedî wê derfetê ku ew amrazên ku di pêvajoyên aşitiyê de bi kar tên û tiştên ku hîn bûne, parve bikin.

**D) Pênasekirin, hêza analîzkirin û pêşniyarkirinê.** Ev yek li gel kapasîteya civaka sîvîl ji bo hilberandina cih û pêvajoyên fikirîna gotûbêjker têkildar e ku bi wan îmajên erênî bo siberojê tên pêşvebirin û prensîb dikarin bên beralîkirin. Li vir, divê hesab bê kirin ka çawa mumkîn e qadên gotûbêjê wisa bên kirin ku hemwelatiyên asayî bikarin bigihîjinê û her wiha hesab bê kirin ka çawa mumkîn e têkiliya van qadan li gel biryarderan bê danîn. Pênasekirin, hêza analîzkirin û pêşniyarkirinê hem berî gotûbêjan û hem di wexta gotûbêjan de gelek girîng e. Nimûne:

•**KOLOMBIYA** Hêza pênasekirin/analîzkirin/pêşniyarkirin li Kolombiyayê, ku beşdariya civaka sîvîl xwedî dîrokeke dirêj e, bi awayekî gelek şênber bûye. Li Lûtkeya Jinên Neteweyî, li 2013, jinên ku ji çar aliyên welêt û ji reçelekên ciyawaz (ciyawaziyên îdeolojîk jî tê de) hatibûn, hêza xwe kirin yek û hin peyman û pêşniyarên hevpar û stratêjîk pêşve birin ji bo ku bandorê li pêvajoya aşitiyê bikin ku hê nû dest pê kiribû. Sê mijarên bingehîn ev bûn: **1)** piştgîrîkirina pêvajoya aşitiyê **2)** daxwaz ji bo beşdarbûna jinan li hemû qonaxên pêvajoyê û daxwaz ji bo beşdarkirina wan xeman ku dibêjin şer çawa bandor li jinan kiriye **3)** daxwaza avakirina jêr-komîsyonekê li ser bingeha zayenda civakî, wek

mekanîzmek ji bo desteberkirin û kontrolkirina beşdarbûna jinan û beşdarkirina ezmûnên pevçûnan ên jinên curbecur. Vê Lûtkeya Neteweyî karî bandorê li biryarderan û pêvajoya aşitiyê bike.

Ev çar fonksiyon hemû bi hev re têkildar in. Hêza ve-çarçovekirina cemserbendî(polarization)ê û avakirina piran di navbera wan kesan de ku pevçûnan ji hev veqetandine dihêle ji bo ku ev kom ji bo bidawîkirina pevçûnekê pêşniyaran bikin.

Fikra şeşem. Civaka sîvîl, her wekî ku em li dinyayê dibînin, wexta qonaxên pevçûnên tundûtîj bi gelek zehmetiyan re rûbirû ne. Civaka sîvîl, mumkîn e di pevçûnekê de bi awayekî rasterast weya nerasterast bibe armanca tundûtîjî û peyketina qanûnî (prosecution), mumkîn e berî gotûbêjan û di wexta gotûbêjan de li derve bêne hiştin, mumkîn e bêbeş(mehrûm) bin ji piştgîriyeke civakî ya berfireh û ji kapasîteya konsîlîdekirina nifûsê di asteke berfireh de, mumkîn e bi zêdebûn û tevlihevbûna pevçûnan û dirêjeya wan a herêmî bandor bigirin. Bi vî awayî tebeqeyên pevçûnan zêde dibin weya senaryoyên rîskan lê zêde dibin.

Di heman demê de, kapasîteyeke gelek mezin a elastîkbûn û piştgîriya beramberî ya civaka sîvîl û mirovên xwecihî li seranserê dinyayê heye. Em dikarin hin fikran binxêz bikin ku ji pevçûnên din û ji dersên cîbicîkerên aşitiyê derketine:

**A) Girîngiya pêvajoyan zêdetir ji çalakiyên îzolebûyî**

**B) Têkildarî pêvajoyan, girîngiya payîdarbûnê.** Ev yek wan pirsan ferz dike ku John Paul Lederach pêşniyar dike:

• Bi rastî çi heye û baş dixebite? Mumkîn e halê hazir binyadên civakî hebin ku ji ber pevçûnan ji hev veqetiyane û em bixwazin ji bo çêkirina jêrxana aşitiyê û xurtkirina komên piştgîr ên aşitiyê têkiliyê li gel wan daynin. Di nimûneya Nepalê de, hinek ji van komeleyên daristankariyê bûn.

• Çi heye ku baş naxebite û divê biguhere?

• Çi nîne lê ku hebe dê baş bixebite? Di nimûneya Qefqasa Başûr de, jinên ku li herêmên pevçûnan dijîn toreke navbînkar a jinan ava dikin ku armanc dike ku bibe amrazek ji bo avakirina aşitiyeke payîdar û giştgîr.

**C) Derseke din ku derketiye girîngiya taybetmendiya kontekstê ye.** Girîngtirîn çavkanî ji bo avakirina aşitiyê ji akterên xwecihî derdikeve. Di heman demê de, **tifaqên li ser bingeha baweriyê di navbera akterên xwecihî û akterên herêmî weya navneteweyî de,** ji ber çend sedeman di avakirina aşitiyê de dikare stratêjîk be. Tifaq, rageşî û di wextên çerxa bipevçûn de dikare bandorên neyînî yên tecrîdê sivik bike û dikare hêz û çavkaniya temamker ji bo akterên xwecihî pêşkêş bike, wekî lojîstîk, piştgiriya ekonomîk, kanalên têkilîdanînê li gel biryarderan, hînbûna berawirdkarî û hwd.

**D) Her wiha, mumkîn e fikirîn li ser mijarên têkildarî dûrahiyê sûdewer be.** Bo nimûne, akterên stratêjîk kî ne ku ji ber sedemên torên xwe yên li gel sektorên din ên civakê dikarin li pêvajoyek ji pêvajoyan beşdar bin? Çawa dikare têkiliyên di navbera înîsiyatîfên aşitiyê yên ciyawaz weya pêvajoyan de bên danîn ji bo xurtkirina sînerjî û bandoran? Koalîsyon, platform, tor û tifaq di hin rewşan de sûdewer bûn, wekî rêxistinên jinan ên li gelek welatên cuda ku ji pevçûnan bandor girtine.

**E) Ji aliyê çarçoveya demî ve, mumkîn e dîtina hevsengiya kurtdem û navincî/dirêjdem girîng be.** Her wekî ku berî niha hate gotin, pêvajoyên aşitiyê pêvajoyên dirêjdem in. Guhertinên di çarçoveya têkiliyan de demê digire. Di heman demê de, civaka sîvîl û bi giştî civak, jiyana zarokên kur û keç jî tê de, behsa pirsgirêkên lezgîn û pêwîstiyên gelek berbiçav dikin. Fikirîn li ser analîza pevçûnan tevî çarçoveya demî, dikare sûdewer be ji bo pêdeçûna rêbaz û rol û fonksiyonên civaka sîvîl. Bo nimûne, di wexta cemserbendiya bilind û pevçûnên tund de, hin înîsiyatîfên civaka sîvîl ku hewl didin piran di navbera wan kesan de çêkin ku pevçûnan ji hev veqetandine, mumkîn e pêwîstiya wan bi rayedariyê hebe ji bo ku wan biparêze û hin dem bide wan da ku konsolîde bibin. Karekî zehmet û derfetek e ji bo nêrîneke berfireh li çarçoveya demî (time-frame).

**F)** Civaka sîvîl, ji aliyê pevçûnên tund ve di gelek nimûneyên din de û li Komara Demokratîk a Kongoyê û li Kolombiyayê wek **amrazeke bihêz ji bo dermankirin û xwedîkirina** şexsî û giştî ya ruh, beden û zîhnan hatiye pênasekirin.

Ez li vir radiwestim. Gelek spas ji bo eleqeya we. Ez pir dixwazim hemû fikr û ezmûnên we guhdarî bikim. Di navberan de, ji kerema xwe dudil nebin ji bo peywendiyê bi rêya e-postayê.

## HUSEYİN ORUÇ

Roja we bi xêr.

Ez spasiya moderatorê me dikim. Ez ê înşella zêdetir ji pêvajoya Tirkiyeyê behsa Moroyê bikim. Moro cografyayek e ku em wê kêmtir nas dikin û dizanin.

Bi rastî rola IHH'yê kêm hate axaftin. Lê Moro jî gelek kêm hate axaftin. Eger destûra we hebe, ez dixwazim ewil gelek bi kurtasî behsa şer û aşitiya Moroyê bikim.

Moro, li dinyayê di nav pevçûnên herî kevn de di rêza yekem de ye. Pevçûnek ku li 1521'an dest pê kiriye. Ji wê rojê heta îro xwedî dîrokeke wisa ye ku car car aşitî çêbûye lê şer jî her tim hebûye. Ewilî bi îspanyolan re û paşê bo demeke kurt bi îngîlîzan re û piştî wê jî serdemeke gelek dehşetnak a Amerîkayê heye. Serdemeke Amerîkayê heye ku gelê Moroyê bi tundî hatiye goşegîrkirin û ji erdên xwe hatine kirin wekî çawa li Fîlîstînê çêbûye.

Wexta ku em tên 1946'an, Sîstema Dinyaya Nû, gava ku dinyaya nû dihat avakirin pirsiyara bingehîn ku dihat pirskirin ew bû ku her kes, hemû civat heçî bi dilê wan e dê berdewam bikin, paşxaneya wan a dîrokî her çi be, dê li gorî wê berdewam bikin. Moro civatek e ku berî ku Fîlîpîn bibe dewlet bûye dewlet. Cara ewil behsa navê Fîlîpînê di serdema kral Philip ê îspanyol ê Macellanê de tê kirin. Hingî sal 1521 e û ew der wek erdên Philip tên binavkirin. Lê wexta ku ew tê, hingî du heb dewletên misiliman ên Moroyê hebûne. Yek Siltaniyeta Sûlûyê ya din jî Siltaniyeta Maguindanaoyê bûye. Yanî em Fîlîpînê wek dewlet qebûl dikin ku aliyê pevçûnê ye lê gava ku em li dîroka wê dinêrin tam berevajî vê yekê ye. Li aliyekî moroyiyên ku dewlet bûne heye û li aliyê din binyadek heye ku ji bo dagîrkirinê hatiye.

Gava ku sal dibe 1946, civat bi her tiştê xwe li wir e. Bi dîroka xwe, bi raboriya xwe, bi zimanê xwe, bi çanda xwe, bi binyada xwe ya cografîk civatek li wir e û li bendê ye ku bibe dewlet. Amerîka dibêje ku ez ê serxwebûnê bidim û gava ku ev serxwebûn tê dayîn jî, gelê Moroyê bi awayekî siruştî dest bi xebatên dewletbûnê dike lê tiştê ku dixwaze nabe. Amerîka Fîlîpînê dike welatekî azad û herêmên ku li başûrê Maguindanao û li girava Sûlûyê cih digirin ku zêdetir misilman li wan deran dijîn, bi awayekî dîrokî misilman xwedî lê derdikevin û li ser wan dewlet ava kirine jî daxilî Fîlîpînê tên kirin. Lê belê ev yek jî agirê pevçûnekê pê naxe. Ji 1948'an heta 1967'an têkoşîneke huqûqî tê kirin. Kêmîneya misilman li Fîlîpînê fikr dike ku di dinyaya nû de dikare mafên xwe bi rêya huqûq û dîplomasiyê wergire. Lê di sala 1967'an de li Girava Korîdorê ku îro hema li kêleka Manilayê cih digire, komkujiyek çêdibe. Ciwanên moroyî ku çûne leşkeriyê, nêzîkî 100 heb ciwan, gava ku raketine, bi gulebarankirinê tên qetilkirin. Tenê kesek ji komkujiyê rizgar dibe. Ew jî, gava ku behs dike ka çawa ev komkujî çêbûye, li hemû Fîlîpînê, li Başûr ku nexasim misilman lê zêde dijîn, ji nû ve liv û tevgerek çêdibe. Û biryar didin ku êdî ev kar bê şer hel nabe. Pêwîst e berxwedanek dest pê bike. Bi 67'an re bi komên biçûk biçûk berxwedanek dest pê dike. Di 1970'yan de ev berxwedan xwe rêxistin dike, rêxistineke sîwanî tê avakirin. Ev rêxistinên biçûk ku parçe parçe hatine avakirin, di bin vê sîwanê de li hev kom dibin. Tiştekî gelek girîng e; rêxistineke berxwedanê derdikeve ku hemû civakê temsîl dike. Binyadek derdikeve ku her kes ketiye bin sîwana wê û tê de akter e. Di 1970'yan de berxwedaneke rêxistinkirî dest pê dike. Gava ku sal dibe 1973 jî, dewleta Fîlîpînê tê li ser maseyê rûdine.

Ya ku îro em behsa wê dikin, ya ku em jê re dibêjin pêvajoya aşitiyê, di 1970 weya 1967'an de dest pê dike û we dît ev pevçûnên ku nêzîkî 50 salan berdewam dikin, aşitiya wan a ewil jî di 1973'yan de behsa wê te meydanê. Di 73, 76, 89, 91, 97, 2001, 2008'an de digihîjin peymanan. Ez vî tiştî ji bo wê yekê dibêjim: Aşitî her tim li ser maseyê tê axaftin, hildiweşe, tê axaftin, hildiweşe lê du alî jî li ser meseleya aşitiyê gelek eynat in. Xwedî îradeya berdewamkirina rêya xwe ne bêyî ku maseyê biterikînin.

Paşê ev binyad dabeş dibe û dibe du beş. Binyada ku hemû Moroyê temsîl dike bo ser du aliyan dabeş dibe. Aliyê ku vediqete vê yekê dibêje; em li vir ne nûnertiya etnîkekê û nûnertiyeke cografîk dikin, em misilman in û nasnameya me ya dîrokî Moro ye.

Navê Moroyê jixwe ji vê yekê tê. Îspanyolên ku li gel Macellanî tên, piştî Endûlûsan li herêmê, wekî wan misilmanên ku li Endûlûsê nas dikirin misilmanan dibînin û ji xelkê vir re jî dibêjin moroyî. 'Em misilman in' bingeha nasnameya wan ev e, lîderek, Selamet Haşîmî, derdikeve û dibêje, 'divê em bi wê hereket bikin'. Ew tevgereke nû dide destpêkirin. Eniya Rizgariya Îslamî ya Moroyê ava dike û li ser bingeheke gelek girîng tevdigere. Dibêje ku, "Şerê me ji bo parastina civata me ye, ne ji bo kuştina hinan e. Em hewl didin civakekê pêk bînin. Ew civak jî bes di jîngeheke ewle de dikare pêk were". Ciyawaziyeke gelek girîng li gorî binyada yekem ew e ku berxwedanekê derdixe ku di parastinê de dimîne, tim di parastinê de dimîne, hêriş nake. Û vê têkoşîna xwe jî li ser bingeha krîterên îslamî bi rê ve dibe. Ti krîterekê qebûl nake eger îslamî nebe. Şer jî bi huqûqa îslamî tê meşandin. Gelek mînak ji bo vê yekê dikare bên anîn. Lê ez ê bi yek ji wan mînakan berdewam bikim ku gelek bandor li min kir û paşê ez ê hinekî behsa binyada pêvajoya aşitiyê bikim.

Ez rastî dereke din nehatim ku binyadên gerîlayî yên bi vî rengî hebin û baca şoreşê neyê girtin. Eniya Rizgariya Îslamî ya Moroyê bi zorê ji ti kesî, nav her çi be, pere negirtine. Mekanîzmeke wisa bûye ku hemû bi zekat û alîkariyan meşiyaye ku bi dildarî hatine dayîn. Jixwe ji derveyî welêt xwe xwedî nekiriye. Binyad wisa hatiye kirin ku bi temamî taybet bi Moroyê be. Kesek ji derveyî welêt nehatiye û di asta fermandariya binyadê de cih negirtiye.

Vê yekê niha gava ku em diçin wir, em ji misilmanan dibihîzin lê mumkîn e gelek girîng nebe. Yanî bi rastî ev yek di pratîkê de hatiye cîbicîkirin? Cotabato cihek e ku wek paytexta Moroyê lê tê nêrîn. Gava ku em wek lijne çûn serdana nûnerê herî jor ê katolîk ê wir, min got, "Hûn ê çawa ji van bawer bikin? Bi xwe kesek e ku aşitiyê dixwaze. Hûn çawa piştgîriya aşitiyê dikin? Hûn ê li vir bibin kêmîne. Pozîsyona we dê tam bibe berevajî halê niha.

Binyadeke xweser a 5 mîlyonî dê çêbe. Ji vî 5 mîlyonî 4 mîlyon dê misilman bin û mîlyonek jî xrîstiyan û hûn ê bibin kêmîne. Hûn çawa ji van bawer dikin?" Di bersivê de got, "Di wexta şer de jî me ti zerar ji van nedît. Em di aşitiyê de çawa bibînin?". Ev yek ji bo min wê yekê diselmîne ku ev huqûq gelek baş hatiye cîbicîkirin. Dîsan gotineke gelek girîng a Selamet Haşîmî: "Ti şerek nayê qebûlkirin eger berê wê li aşitiyê nebe". Binyadek heye ku aşitî armanca wê ye. Gerîlayeke gelek bihêz tê avakirin. Teqrîben hêzeke 50 hezar kesî. Beşeke girîng a van her tim çekdar e. Ev yek jî yek ji wan fakterên girîng e ku dewleta Fîlîpînê tîne ser maseyê.

Piştî ku Selamet Haşîmî di sala 2003'yan de wefat dike, Hecî Mirad Îbrahîm peywirê dewr digire. Ew jî heman siyasetê bi rê ve dibe, qet ji maseya aşitiyê ranabin. Di vê serdemê de jî hêrişên gelek mezin çêdibin, komkujiyên gelek mezin çêdibin. Ti yek ji van nahêle ku Eniya Rizgariya Îslamî ya Moroyê ji armanca xwe ya aşitiyê averê bibe.

Pêvajoya îronî, bi navbînkariya Malezyayê çêdibe. Lê dewleta Fîlîpînê dixwaze ku Malezya bikeve navberê. Wekî ku min got, pêvajoyeke gelek dirêj a aşitiyê heye û di vê pêvajoya aşitiyê de mekanîzmek heye ku her tim hildiweşe. Lewma gava ku Eniya Rizgariya Îslamî ya Moroyê dubare di 2001'ê de li ser maseyê rûdine, dibêje, "Ne li vir, divê em li derve li hev rûnin. Divê em li welatekî sêyem li hev rûnin. Em tenê dikarin li wir xwe tam îfade bikin". Maseyek tê danîn li Malezyayê, her du alî lijneyên xwe yên gotûbêjkar dişînin Malezyayê. Zêdetir ji 60'î daniştin çêdibin. Malezya navbînkara serekî ye. Malezya wek navbînkara serekî di wan civînan de her tim rûdine û hewl dide her du aliyan di xalekê de li hev bîne. Qîma xwe bi vê naynin, welatên koma kontak tê diyarkirin ku tê de Tirkiye, Endonezya, Japonya û Îngîlîstan cih digirin. Ev welat jî her tim di mijara aşitiyê de ji bo Malezya û her du aliyan şêwirmendiyê dikin ka em çawa dikarin çareser bikin û bi pêşniyarên xwe yên çareseriyê piştgîriyê didin civînan.

Di sala 2012'an de ev yek mêweya xwe dide û peymana çarçove tê îmzekirin. Di sala 2014'an de jî ev peymana çarçove tê berfireh-

tirkirin û peymana Compharansive Agreement on Bangsamoro (CAB) tê îmzekirin ku wan hemû peymanan li xwe digire ku di wexta hevdîtinan de hatine kirin.

Di peymana çarçove ya sala 2012'an de berpirsiyariyek bi IHH'yê jî hate spartin. Dîsan Eniya Rizgariya Îslamî ya Moroyê ji ber tecrubeyên xwe yên berê ev yek got: "Me gelek caran li hev kir lê peyman hilweşiyan. Her car dewletê derfetên xwe yên dewletbûnê bi kar anîn û ji hemû dinyayê re got ku peyman ji aliyê Eniya Rizgariya Îslamî ya Moroyê ve hatine hilweşandin. Dengê Eniyê korîk e, nikare ti tiştî ji dinyayê re bêje. Lê dewletê bi derfetên xwe yê dewletbûnê, bi dengekî pir bilindtir her car got ku misilmanan peyman hilweşandine û derfeta wê yekê jî dît ku vî tiştî bi radeyeke mezin behs bike". Ji bo ku careke dî ev tişt neqewime Eniya Îslamî xwest ku lijneyeke çavdêriyê *(Third Party Monitoring Team* TPMT) were pêkanîn. Ev lijneya 5 kesî diviya serbixwe bûya û diviya çavdêriya her du aliyan bikira ka berpirsiyariyên xwe cîbicî dikin yan na. Hate gotin ku bila binyadeke wisa be ku "bi temamî serbixwe be û gotinên wê jî girêder bin". 5 kes bi temamî ji derve, ne ji nav pêvajoyê bûn, ne aliyên rasterast ên dewlet yan jî Eniyê bûn, li ser wan fîger(fîgur)ekî navneteweyî hebû, balyozê berê yê Yekîtiya Ewrûpayê anîn û kirin serokê lijneyê. Bila du heb nûnerên navneteweyî hebin. Bila ev kes ew nav bin ku aliyan pêşniyar kirine lê aliyê din jî qebûl dikin. Yek Weqfa Asyayê bû. Weqfa Asyayê navenda wê li Amerîkayê ye. Weqfek e ku li Asyaya Rojhilatê Başûr û li Fîlîpînê bi awayekî çir û pir xebatan dike. Bû nûnera welatê wê. Yek jî IHH bû. Li beramberî wê yan jî wek SCS'yeke navneteweyî IHH'yê berpirsiyarî girte ser xwe. Em du mehan carê diçin serdana herêmê. Bi dirêjahiya 15 rojan em li gel aliyan hevdîtinê dikin û paşê raporan amade dikin ka heta çi radeyekê ev peyman hatiye cîbicîkirin. Du cure rapor tên amadekirin. Yek ji wan, ew rapor e ku piştî her peywirê em amade dikin. Di vê raporê de em li gel du aliyên sereke hevdîtinê dikin. Em li gel du lijneyên gotûbêjkar civînên dirêj çêdikin û fikrê her du aliyan digirin ka rewş gihîştiye çi xalê. Ev tenê nayê kirin. Her wiha di wan hevdîtinan de ku li gel nûnerên civaka sîvîl, nûnerên akadêmiyê, nûnerên dêran, nûnerên îslamî tên kirin, ew tiştên ku van du panêlan gotine tên

teyîdkirin û testkirin. Tê mêzekirin ka di kîjan pozîsyonê de ne û piştî her peywira du mehî raporek bo her du aliyan tê şandin. Tê gotin ku, "Tesbîtên me ev in". Her du alî vê raporê digirin, bi kêmanî û zêdehî û bersivên xwe ve wek not bo dîrokê tê nivîsîn.

Ev hatin kirin, ev nehatin kirin, ev ji ber vê sedemê nehatin kirin, bi vî awayî pêvajo gav bi gav tê tomarkirin. Ji vê lijneyê tê xwestin ku salê carê bi daxuyaniyeke çapemeniyê pêşveçûnên salane belav bike. Li wir jî hewl tê dayîn ku bi awayekî hestyar bê reftarkirin. Pêvajoyên aşitiyê gelek hevraz û nişîvên wê hene. Ew tiştê ku li Moroyê min tecrube kir her wisa bû. Hin dem hene ku hêvî gelek kêm dibe, zehmetî derdikevin asta herî jor û hin dem hene gelek erênî ne û bi lez mirov pêşve diçe. Em jî li gorî şertûmercên wê rojê, hin tiştan bi awayekî vekirî belav dikin û hin tiştan jî tenê bi panêlê sînordar dikin. Peywira wir dê berdewamiyê bide hêviyê. Cihên ku pêvajo baş derbas dibin di raporê de zêdetir behsa wan tê kirin û di daxuyaniya çapemeniyê de ev tên belavkirin. Lê ev yek nayê wê wateyê ku kêmasî teqez tên raporkirin û li gel her du aliyan tên parvekirin. Tenê civîna ku em bi gel re dikin di wê de yan jî di daxuyaniya çapemeniyê de heta mumkîn e em wan xalan derdixin pêş ku dê zerarê nedin aşitiyê. Bi daxuyaniyên çapemeniyê rapor tên çêkirin ku dê tevkariyê li pêvajoyê bikin.

Xaleke gelek girîng a werçerxanê qewimî. Ez dawiyê bi wê temam bikim. Dibe ku em di pirs û bersivan de bi hûrgilîtir behs bikin. Peymanê du alî çêdikin. Lê ji bo ku bikare bê cîbicîkirin teqez divê bibe qanûn. Eger peymanek nebe qanûn, beramberiyeke wê ya zêde nabe. Gotûbêjek ku 17 salan kêşaye, piştî 17 salan peymanek çêdibe. Di vê peymanê de, gava ku hûn li pêvajoyê binêrin, peymaneke wisa ye ku esasen her du aliyan gelek tawîz dane. Gava ku hate asta meclîsê, bi desttêwerdana hin aliyên derekî, pêvajo di 2014 û 2016'an de hate rawestandin. Serokê nû yê Dewletê ji nû ve xiste rojeva meclîsê û Tîrmeha borî bû qanûn. Ev peyman wek qanûn derbas bû lê hin madde, nexasim maddeyên ku ji bo Eniyê gelek krîtîk in, hatin mevredkirin û jêkirin da ku ev qanûn derbas be. Xaleke gelek girîng bû ji bo Eniyê da ku biryarê bide. Ya dê bigota temam ya jî dê bigota qebûl nakim û ji nû ve vegeriya halê pevçûnan. Ya rast dikarî vê yekê bike;

ji ber ku gelek maddeyên serekî neketibûn peymanê. Di nav xwe de çareseriyeke gelek cîddî peyda kirin. Ev yek gotin, “Ev ne peymana me ye. Me li ser vê li hev nekiribû. Lê em vê qanûnê wek yekemîn gava qanûnî qebûl dikin. Feqet em ê xala dawî pêk neynin heta ku maddeyên din ên peymanê neyên cîbicîkirin.”

Bi gotineke gelek sade peyman ev e: Her du alî gavek paşve dikişin. Misilman dest ji serxwebûnê berdidin û dewleta Fîlîpînê jî dest ji tunekirina misilmanan yan jî binyada rêxistinkirî ya misilmanan ber dide bi rêya çekan. Biryarê didin ku pêkve bijîn. Dewlet raboriyê qebûl dike. Rapora ku komîsyona avakirî li ser hemû neheqiyan amade kiriye qebûl dike. Komkujiyan qebûl dike. Cezayên ku bi neheq hatine dayîn qebûl dike û ji ber vê yekê lêborîna xwe dixwaze. Dibêje dê gavên pêwîst biavêje ji bo ku ev tişt dubare neqewimin. Qebûl dike ku ev ax di dîrokê de ya misilmanên Moroyê bûne. Vê yekê binxêz dike. Her çend li Fîlîpînê sîstemeke unîter hebe jî, herêm digihê xweseriyekê û destûr pê hatiye dayîn ku bi parlamentoya xwe, bi kabîneya ku parlamentoya xwe pêk aniye xwe îdare bike; di nav van sînoran de hemû raye yên vê hukumetê ne. Leşker vedikişin û hêzeke polîs ji Bangsamoroyiyan tê avakirin. Jixwe tiştê herî girîng ev e ku di qanûnê de cih nagire. Parlamentoyê rê neda vê yekê, ev yek pêk nehat. Dewlemendiya vir, sedî 75 bo dewleta Bangsamoro, bo jêr-dewletê, sedî 25 bo hukumeta navendî hate hiştin. Ji bo ku zehmetiyên berê bêne tolerekirin jî, sedî 5 ji budceya dewleta Fîlîpînê her sal bi awayekî otomatîk ji vê hukumetê re hate hiştin. Gava ku hûn ji aliyê darayî ve lê binêrin xweseriyeke xwedî derfetên darayî ya wisa derdikeve holê ku dê 2-3 car mezintir be ji binyada heyî û xwedî wê derfetê be ku vê derfeta darayî bi rêya hukumeta xwe bi kar bîne.

Dîsan destkefteke gelek girîng ku li cihekî din nîne; binyadeke cot-huqûqî dike derkeve. Bingehîntirîn daxwaza misilmanan, huqûqa şerî ye. Têkildarî vê yekê, dewlet dadgehên şerî qebûl dike. Zincîre dadgehên nû dê bêne damezrandin. Derbasdariya wê tenê dê bi vê herêma xweser sînordar be. Dozên ku her du aliyên wê misilman in, di van dadgehên şerî de dê çêbin. Lê ji bo vê jî şert hate danîn. Hemû dozên asayî dê li vir bêne çêkirin. Lê belê ewilî hukmên şerî dê di huqûqa medenî de bêne cîbicîkirin.

Piştre jî hukmên şerî dê li beşên têkildarî huqûqa cezayê jî bi demê re bêne zêdekirin. Li hember van hemû tiştan jî Eniya Rizgariya Îslamî ya Moroyê soz dide ku çekên xwe dayne.

Têkildarî vê yekê jî mekanîzmeke ecêb hate pêkanîn. Esasen berî niha li Îngîlîstanê hatiye ceribandin. Çek tiştekî gelek binirx û pîroz e; lewma gelek dijwar e ku tu wê bidî dijmin. Lewma jî komîsyoneke serbixwe hate damezrandin da ku çek pê bêne radestkirin *(International Decominssioning Body* – Binyada Bêçekbûna Navneteweyî). Binyadek bû ku ji Tirkiye, Norvêç û Brûneyê pêk dihat; Tirkiyeyê serokatiya wê girte ser xwe. Van welatan wek destêemîn (garnishee) dê çek bigirtana û herêmên ku wan diyar kirine li wir dê bi depo bikirana. Parastina van çekan jî dê ji aliyê wan hêzên çekdar ve bihatana kirin ku ji Artêş, Polîs û Eniya Rizgariya Îslamî ya Moroyê pêk dihat. Binyadek dê bihata avakirin ku her du aliyên şer tê de cih digirin. Piştî ku pêvajo temam bû, hukumeta ku dê pêk were dê biryarê bide ka ev çek dê çawa bêne bikaranîn. Vê yekê jî wê di sê qonaxan de pêk bînin. Wexta ku referandûm hate qebûlkirin %30, wexta ku dewletê soza xwe girt û tiştên pêwîst kirin %30, wexta ku pêvajo bi temamî xilas bû û êdî gotin temam jî %35 dê bê terxîskirin. %5 di destpêka pêvajoyê de bi awayekî sembolîk hatibû terxîskirin. Çar sazûmanan dê biryar bidaya ka pêvajo temam bûye yan na. Ewilî her du alî dê bêjin ku, "Me sozên xwe anîn cih, me soza xwe girt". Lê li cem wan navbînkarê malezyayî û lijneya çavdêriyê ku em tê de cih digirin, dê bêjin ku, "Belê, peyman bi cih hat. Aliyan berpirsiyariyên xwe anîn cih". Bi van çar îmzeyan pêvajo dê temam bibe.

Referandûm wê di 21'ê Çileyê de bê çêkirin ji bo qanûnbûna vê qanûnê û dewreke veguhestinê dê derkeve. Di vê dewra veguhestinê de, bi serokatiya Eniya Rizgariya Îslamî ya Moroyê wê hukumeteke demkî heta 2022'yan bê avakirin û cîcicîbûna vê peymanê jî dê ev hukumet bişopîne. Em ê jî heta 2022'yan, du mehan carê berdewam bin li serdanên xwe û em ê bibin şahidê temambûna pêvajoyê.

**HUSEYİN ORUÇ:** Xwedîderketin li pêvajoyê. Em ne aliyê vê mekanîzmê ne. Em ne beşek in ji bazariyên mekanîzmê. Jixwe ji me

nayê xwestin ku em fikrên xwe bêjin. Em temaşekarên wê ne. Çarçoveya ku her du aliyan li hev kiriye her çi be, em mêze dikin ka soza xwe girtine yan na. Lewma em ji her du aliyan re jî nabêjin vî tiştî bikin û wî tiştî nekin. Hûn ji her du aliyan re dibêjin we soz dabû ku hûn vî tiştî bikin. Ji ber wê helbet fikrê min jî heye. Gava ku ez xusûsî hevdîtinê dikim, tiştek heye ku ez ji her du aliyan re dibêjim. Lê wek lijne fikra me nîne. Divê nebe. Ev der tenê kontrol dike ka berpirsiyarî hatine bicihanîn yan na.

Mekanîzmaya têkildarî çekan wiha hate çêkirin. esasen têkildarî normalîzebûnê mekanîzmek heye. 4 qonaxên vê hatin pêkanîn. Di her çar qonaxan de jî bêçekbûn heye, efa giştî heye, piştgîriyên sosyo-ekonomîk hene, entegrasyona komên çekdar di nav civakê de heye, ve-avakirina bajaran heye, sernavên wekî başkirin û ewlehiya van kampan hene têkildarî ji nû ve vegera kampan bo jiyana civakî. Ev qonax bi qonax hatin destnîşankirin û matrîkskirin. Ji bo nîşandana niyetpakiyê sedî 5 ji çekdaran hatin bêçekkirin. Ev yek tiştekî girîng bû û nîşan da ku her du alî xwedî li pêvajoyê derdikevin. Ev yek bi bernameyekê hate kirin ku serokê dewletê û lîderê Eniya Rizgariya Îslamî ya Moroyê tê de beşdar bûbûn. Tiştekî gelek sembolîk bû. Jimareyeke kêm ji binyada çekdaran gotin êdî me çekên xwe daynîne. Hatin, 146 kesî bi vî rengî çekên xwe daynîn. Mîqdarek jî çek hate radestkirin. Lê piştre pêvajoyeke sedî 30, sedî 30 û sedî 35 heye.

**Pirsiyar**: Nehatin destgîrkirin ew paşê, ne wisa?

**HUSEYİN ORUÇ:** Ne, nehatin destgîrkirin. Nehatin destgîrkirin. Yanî dema ku em diçin nav hûrgiliyan, tiştekî wiha dest pê kir. Esasen ev yek piştî tecrubeyeke dirêj pêk hatiye. Hin tişt hene ku li ba me çênabin, hin tişt hene ku dikarin li ba me çêbin. Ez ê vê yekê jî bêjim. Yanî li wir ev peyman li koşka serokatiyê hate îmzekirin. Hemû fermandarên Eniya Rizgariya Îslamî ya Moroyê li îmzekirina vê peymanê beşdar bûn. Bê îstîsna, yanî bernameyeke wisa çêkirin ku ji lîderê wê bigire heta serokerkan û hemû fermanderên eniyê beşdar bûn. Yanî pêşbînî ji hevdu gelek cuda ne. Lê tiştê ku Eniyê di serî de teqez dixwest ev e; dîsan tiştek e ku li ba me ne mumkîn e lê li wir mumkîn e. Pêş-parêzbendiyek ji bo hemû lîderan hate dayîn ku pêvajo bi rê ve dibirin. Yanî wex-

ta ku pêvajoyê dest pê kir, kesên ku pêvajo bi rê ve dibirin parêzbendî girtin jixwe. Lewma wan azadiya seyahetê heye. Dikarin biçin her derê û werin, dikarin biaxivin. Ev yek ji bo fermandarên çolê nehate kirin lê ji bo lîderiyê hate kirin. Hecî Mi-rad Îbrahîm, lîderê Eniyê, ew niha ji ti tiştî doz li ser wî nînin. Hemû dozên wî hatine rawestandin, lewma dikare hemû hevdîtinên xwe di qada navneteweyî de jî bike. Eger ev referandûm di 21'ê Çileyê de bê qebûlkirin, eger herêma otonom çêbe û hukumeta veguhêz pêk were, hingî beşa sedî 30'î wê çekan dayne.

**Pirsiyar:** Piştî referandûmê?

**HUSEYİN ORUÇ:** Piştî referandûmê. Pêvajoyeke sedî 30'î heye piştî referandûmê. Yanî ne hêsan e ku di nav pêşveçûna peymanê de her tişt di dîroka xwe de bê kirin. Ya rast diviya ev qanûn di 2014'an de derketa. Ev qanûn 4 sal dereng ket. Îcar Enî jî tebe'n di hin xalan de hêdî tevdigere. Bo nimûne ev çekdanîna sedî 30 wê 7-8 mehan dem bigire. Di nav vê pêvajoya 7-8 mehî de tiştekî teqez ku Enî dixwaze, destnîşankirina çarçoveya efa giştî ye. Dewlet her tim dibêje 'navan bidin, em ê wan ef bikin'. Enî jî dibêje, 'ez ne ji bo navan efeke giştî dixwazim. Çiku navên ku ez ê bidim tu îro ef dikî lê sibe ji bo kesekî din dozeke din derdikeve, em ê wan çawa bikin?'.

Wekî ku min got, min alî nîne li vir. Tiştê ku Enî dibêje, bi min rasttir e. Lê peyman çi bêje em wî her car bi bîra her du aliyan dixin. Çekberdan di nav pêvajoyê de, hinekî girêdayî bicihanîna berpirsiyariyan e. Mijareke gelek girîng heye li vir, komên din ên çekdar li derveyî her du aliyan hene her çend biçûk bin. Xetereya van koman li ser ewlehiyê heye. Niha piştî ku Eniya Îslamî (MILF) çek berdan, valahiyeke mezin a ewlehiyê wê li herêmê derkeve. Ewlehiya hin herêman bi temamî di bin kontrola MILFê de ye. MILF vê dibêje; hêzeke veguhêz a polîsan heye ku bi hevparî dê bê pêkanîn. Heta ku ev hêz pêk neyê û li çolê kontrolê pêk neyne, ez leşkerên xwe bernadim. Ev ê bibe. Niha perwerdeya van berdewam dike. Qonax bi qonax dê bê kirin. Xala herî dawî ev e: beşa sedî 30'î ya dawî, piştî ku her tişt xilas bû, wekî min gava din behsa çar aliyan kir, ev çar alî dê bêjin 'belê, peyman temam bû' û Exit Agreement îmze kir, hingî beşa sedî 30'î

ya dawî wê çekan dayne. Hejmar hîna nîne. Yanî kêmek berî niha min behsa 50 hezarî kir lê her çend her du alî gihîştibin vê xalê jî, li ser hejmarê hîna nekarîn tam li hev bikin. Enî dibêje 50 hezar e, pêşbîniya dewletê teqrîben 20 hezar e. Lê herhal di xalekê de wê lihevkirin çêbe û ew ê bê ragihandin înşella. Li ser wê dê bimeşe.

**Pirsiyar:** Ev efa giştî û tiştê ku Enî piştgiriyê dike, efa giştî û sedî 30'a piştî referandûmê, gelo rast e?

**HUSEYİN ORUÇ:** Nexêr. Destnîşankirina krîterên efa giştî. Di van û wan şertan de em, ew krîter dê bêne destnîşankirin. Piştî wan krîteran, wexta ku pêvajo temam bû, hingî efa giştî wê hatibe ragihandin. Paşê pêvajoya sedî 30'î wê çêbe. Lê girîngtirîn krîter li vir referandûm e. Divê belê ji referandûmê derkeve ji bo ku ev yek bê kirin.

Her derî –berdewama pirsiyarê- her derî li gorî xwe şertûmercên xwe hene. Niha, wekî ku ez li wir tevdigerim, eger li Tirkiyeyê jî bi heman rengî tevbigerim, di nav du rojan de ez têm deportkirin, ya rast ev tiştekî gelek siruştî ye jî. Mekanîzma pêvajoya aşitiyê ya wir, rayeyeke gelek berfireh da lijneya çavdêriyê. Me derfet heye ku em ji hemû aliyan pirsiyaran bikin. Min li gel serokerkan hevdîtin kir. Min derfet peyda kir da bikevim civînên encumena ewlehiya neteweyî û li wir biaxivim û pêvajoyê binirxînim. Me li gel serokê dewletê hevdîtin kir. Me li gel fermandarên Eniyê û lîderê Eniyê hevdîtin kir û me derfet peyda kir ji bo ku em bikarin her tiştî bipirsin. Yanî gava ku hûn dikevine nav encumena ewlehiya neteweyî... Ez tiştekî biçûk parve bikim, tiştekî wisa çêbe eger, li gel cihekî din digunce? Hingî li gel wir digunca. Bi Duterte re Fîlîpîneke nû derdikeve. Bi Duterte re Fîlîpînek derdikeve meydanê ku aliyê wê yê neteweparêz gelek zêdetir li pêş e. Yanî ez dibêjim qey ez nikarim wekî du sal berî niha tevbigerim. Fermandarê Hêzên Hewayî got, "Bi van misilmanan re aşitî çênabe. Tu bi yekî re aşt dibî lê paşê yekî din derdikeve. Ew tevliheviyê derdixin. Em niha li gel vê Eniya Îslamî aşt bûn lê piştî peymanê ev ê jî dabeş bibe. Vê carê em neçar in ya ku veqetiyaye bi muxatab wergirin. Tiştekî wisa çênabe". Min jî soz girt. Li wir jî, wekî li cem me, gelek resmî ye atmosfer. Min

got, "Berpirsiyariya vir ne ya Eniyê ye, ya we ye. Ya ku divê vê yekê biparêze hûn in. Eger ji bilî Eniyê rêxistinên din hebin ku we li gel wan li hev kiriye, we ew maf jî nîne ku tiştên wan kirine hûn bixin stûyê Eniyê. Peymana we li gel Eniyê ye. Tiştê ku em aniha diaxivin jî, tiştên ku Eniyê kirine û nekirine divê em wan biaxivin. Eger hûn li ser akterên sêyem biaxivin, hingî em jî diaxivin. Yanî we maf nîne ku hûn tiştekî bi vî rengî bêjin". Bersiv neda, nekarî bide. Yanî li Tirkiyeyê yan jî li welatekî din pirsiyarên wiha ji fermandarên hêzên hewayî gelek zêde nayên pirsîn. Hûn bipirsin jî bersivên gelek ciddî dernakevin.

Yanî wekî min got, derfetên wir zêdetir in ji bo axaftinê. Bo nimûne di vê mijarê de Enî gelek vekirîtir e. Gelek gelek gelek vekirî ne ji rexneyê re. Hûn dikarin tiştên bi vî rengî bi rehetî ji her kesî re bêjin, ji lîder bigire heta jêr. Û hûn xwe bi ewle hest dikin û van tiştan dibêjin. Ji aliyê Eniyê ve hûn hest bi tu fikarekê nakin gava ku hûn tiştekî dibêjin. Ev ne tenê taybet bi min e. Ji bo her kesê ku di nav pêvajoyê de ye û ji bo SCS'yên biyanî yên ku ji derve tên jî wisa ye. Zerardîtiyek, akterekî sêyem ku heta îro li herêmê zerar dîtibe nîne. Ne kesek heye ku hatibe destgîrkirin ne jî tiştek hatiye serê wan kesan gava ku hatine qadên ku di bin kontrola Eniyê de ne. Eve, wekî Kak Ûfûk got, gava ku em berê xwe didine Sûriyeyê her tişt ketiye nav hev. Ne ewlehiya rojnameger heye ne ya civaka sîvîl ne jî ya keseke din. Ewlehiya can ji bo ti kesî nîne. Mixabin ji me ti kesî ewlehiya can nîne li çolê. Ji bo kesên ku nasnameya îslamî li ser wan e jî ev yek wisa ye, ji bo komên îslamî yên li çolê jî hûn hest bi heman neewlehiyê dikin, ji bo komên din jî hûn hest bi heman neewlehiyê dikin.

Ez li vir vî bêjim. Em wek weqf, wek IHH, ez dibêjim qey li Sûriyeyê di nav sazûmanên Tirkiyeyê de, ez dewletê didim aliyekî, ya ku herî zêde dixebite em in. Em ji bo herêmên ku di bin kontrola PYD de ne jî ew qas zêde hewl didin da em bixebitin lê ne ewlehiya me, ne rê didin me ku em biçin herêmê. Hûn nikarin bikevin wir. Li Fîlîpînê rewşeke wiha nîne. Hûn dikarin bi rehetî biçin û bigihîjin her derê ku dixwazin lê xebatê bikin.

Di beşa têkildarî jinan de, mîmarên serdema dawî ya vê aşitiyê jin in. Seroka panêlê, seroka panêlê li aliyê Fîlîpînê, eger derfet

hebûna, îro ew niha li vir dipeyivî. Me gelek hewl da ji bo navbînkarîkirinê. Kak Hakan gelek xwest. Navê Miriam Coronel Ferrer, profesor e. Jiyana wê jî têkildarî aşitiyê ye. Akademîsyenek e ku ne tenê li Fîlîpînê, li seranserê dinyayê xebatên aşitiyê kirine.

Ez dibêjim qey girîngtirîn gav ku serokê berê yê dewletê ji bo aşitiyê avêtiye ew e ku ev xanim aniye ser wê komîsyonê, ser wê panêlê. Ew wêrekiyeke cuda bû. Lê birêvebirina wê jî bi rastî gelek girîng bû. Tiştê ku destê jinan lê ketiye. Mitbexa pêvajoya aşitiyê jî bi jinekê hatibû spartin. Li ser binyada ku sînorên dewletê bi rê ve dibirin jî xanimek hebû. Aşitiya Moroyê, ez ji bo aliyê dewletê dibêjim, bi çarçoveya ku van her du jinan xêz kir çêbû. Di demên gelek krîtîk de jî ez bûm şahidê wê yekê ku wan çawa mudaxeleyî bûyerê dikirin û vedigerandin. Ez dibêjim qey rexneyên ku hûn dibêjin, li Fîlîpînê zêde ne tiştek e. Binyadek e ku hinekî din jin li pêş in.

**Pirsiyar:** Gelo ez ê bersiva pirsa xwe bigirim? Yanî min rica kiribû ku hûn li gel Tirkiyeyê berawird bikin ka ev yek li Tirkiyeyê jî gelo mumkîn e?

**HUSEYİN ORUÇ:** Min gotibû. Bi mînak min gotibû.

**Pirsiyar:** Min got qey bersiva pirseke din bûye.

**HUSEYİN ORUÇ:** Yanî şertên wir cuda ne, şertên vir cuda ne. Carê çarçoveya tevgerîna me ew çarçove ye ku her du aliyan destûr daye. Ew çarçove jî gelek berfireh e. Wekî min got, derfetê dide ku hûn li gel her kesî biaxivin ji serokê dewlet û lîder bigire heta jêr. Hûn bi temamî azad in ji aliyê axaftinê ve.

**Pirsiyar:** ... (nehate famkirin)

**HUSEYİN ORUÇ:** Nabe. Yanî li vir, şertên Tirkiyeyê rê nadin ku ew çarçoveya axaftinê ku dabûn min yan jî dabûn vê lijneyê, li Tirkiyeyê jî bikare bê cîbicîkirin. Yanî di dab û nerîtên me de, di pêşbîniyên me de jî ne ew çend hêsan dikare bê qebûlkirin... Ka sûdewer dibe, nizanim, divê mirov wê bipîve. Lê ev tişt li vir nebûye, nebû. Yanî ez dibêjim qey berfirehtirîn tişt ku li vir çêbû, Lijneya Mirovên Aqilmend bû. Hetta ew jî neçar ma ku di çarço-

veyeke diyarkirî de bimeşe. Lewma, li vir dîsan ne tiştek e ku em digirin, tiştek e ku alî didin. Jixwe gava ku çavê sêyem rêzê li aliyan bigire û zorê bide sînorên wan, nikarin bibin çavê sêyem. Em neçar in tiştê ku li ser biryar hatiye dayîn cîbicî û çavdêrî bikin. Yanî ez ê biryarê nedim ka ev aşitî dê çawa çêbe. Mumkîn e hûrgiliyeke girîng be, ev aşitî aşitiyek e ku her du aliyan çêkiriye. Hêsankarên wê hene lê ne Moroyê ne Fîlîpînê aliyên sêyem tev li vê aşitiyê nekirin. Ez ji bo Moroyê jî vî tiştî gelek bi rehetî dibêjim. Kesên ku xwestin vî karî rawestînin hebûn. Bi awayekî net, nexasim di 2014'an de Amerîkayê xwest bi desttêwerdaneke derekî pêvajoyê rawestîne, rawestand. Di operasyonekê de ku gelek bi nehuqûqî hate kirin, 44 heb leşkerên hêzên taybet hatin kuştin li herêmê. Vê yekê pêvajo rawestand lê gava ku em hatin 2018'ê pêvajoyê ji nû ve dest pê kir.

Rengê jinan heye li aliyê Moroyê lê bi qasî Fîlîpînê zêde nîne. Moro, aliyê Moroyê, komîteyeke navendî ya Eniya Rizgariya Îslamî ya Moroyê heye. Bi vê komîteya navendî birêveberiyê dimeşîne. Rêxistinên ku ez wan nas dikim di nav wan de yek ji wan rêxistinan e ku îstîşare, axaftina beramberî û mekanîzma biryaran herî zêde tê de heye. Her gava ku tê avêtin di vê komîteya navendî de biryar li ser tê dayîn. Lîder bi tena serê xwe biryarê nade. Teqez li wir tê axaftin, li wir biryar li ser tê dayîn û ji wir tê birêvebirin. Jin di nav vê komîteya navendî de jî hene. Lê ez dibêjim qey teqrîben 60 endam in û ji van endaman 12-13 heb jin in, yên din mêr in.

**MODERATOR:** Mamoste Mesût, paşê jî Gulçîn. Paşê jî ez ê ji we re…

**Mamoste Mesût:** Spas dikim Ozge. Ez jî dixwazim ji Kak Huseyîn bipirsim li ser tecrubeya Moroyê. Yanî gava ku min hûn guhdarî kirin, berî niha jî min hin tişt li ser xwendibûn, dîsan dibe ku we nivîsîbin. Bi rastî mirov gelek hêvîdar dibe. Pêvajoyek heye li hember me ku baş bi rê ve çûye. Min li ser navê xwe hest bi tiştekî wisa kir. Yanî bi rastî we pêvajo baş vegot wek diyarde. Lewma ez hinekî hêvîdar bûm lê eger ez ji we bixwazim ku hûn hinekî din wisa analîzeke binyadî bikin, hûn dikarin çi bêjin di vê mijarê de? Yanî nimûneyeke serkeftî heye. Tiştê ku hişt ev nî-

mûne serkeftî be, têkildarî rewşa konjonktûrel bû yan têkildarî înîsiyatîfên akteran bû ku li vî karî daxil bûn, yan jî li pişt vî karî, we dî, azadî yan hin fakterên taybet bi Moroyê yan jî Fîlîpînê hebûn? Yanî hûn bi xwe bêjin lê tiştên ku tên aqilê min yanî tiştên ku bi taybetî ez meraq dikim ev in. Yekem, mesela çanda li vir, yanî em bêjin çanda giştî zêdetir guncaw e bo aşitiyê? Duyem, tiştê ku tê aqilê min, akterên derveyî welêt bêtir angaje ne cuda ji me? Çi zanim, gelo ev aşitî rastî kêliyeke taybet hat? Mesela wekî derketina lîderên baş ji her du aliyan û hwd. Çêdibe hûn li ser van tiştekî bikin, dîsa çi zanim, yanî hûn li gel Tirkiye weya mînakên din berawird bikin. Yek, hûn dikarin çi bêjin, wekî min got, li ser hêmanên binyadîn. Sêyem jî, mumkîn e ez negihîştibimê, gelo bi dirêjahiya vê pêvajoyê dem hene ku pêvajo lengîbe yan xetimîbe? Yên li Moroyê çawa ji van deman derketine? Yek jî dibe ku, we dî, hûn dikarin ewkî bêjin, mesela guncawbûn bo aşitiyê tiştekî wisa heye, we dî, mesela gava em civakên misilman berawird dikin, yên zêdetir guncaw hene yan kêmtir guncaw hene û hwd. Spas dikim.

**HUSEYİN ORUÇ:** Esasen di pirsan de, siyasîkirina bûyerên ku di raporê de hatine tesbîtkirin û bi vê berçavkê li bûyeran nêrîn, zêdetir derdikeve pêş lê eciziya min nîne di vê mijarê de. Min tu îtîrazek nîne ji pirsîna her cure pirsiyarekê. Berî niha 5 salan gava ku min ev berpirsiyarî girt, IHH ev berpirsiyarî qebûl kir û ez çûm herêmê, bingehek heye ku me daniye. Me di pêvajoyekê de berpirsiyarî girt û divê em xwe ji wan berawirdan dûr bigirin ku dê zerarê bigihînin vê pêvajoyê. Ne cihên ku bi awayekî nerênî dê bandorê li hevdu bikin, bila hinek aliyên erênî bigirin lê bila pêvajo jî ji hevdu zerarê nebînin.

Gava ez diçim wir jî, pirsên wekî van tên kirin. Hewl tê dayîn ku meseleya me û ya wir bê berawirdkirin. Ez heta ji min tê hewl didim behsa vê yekê nekim. Çiku hûn dikarin aliyên baş wergirin lê gava ku we aliyên neyînî jî xistin nav hev, hûn zerarê didin ne sûdê. IHH nûnertiyeke wê ya sîvîl heye. Jixwe divê ev lijne wisa be. Ku wisa be, wateyeke wê çêdibe. Di nav binyadên din de berpirsiyariyên dewletî yên Tirkiyeyê jî hene. Di komîsyona çekberdanê de yan jî di komîsyona wergirtina çekan de, balyozekî Tirkyeyê heye; serokatiya lijneyê jî bi rê ve dibe. Di heman

demê de jî Tirkiye bi balyozekî xwe ve yek ji welatên kontak e ku di pêvajoya Malezyayê de qismen li pêvajoyê daxil bû. Ez nikarim bêjim ku gelek daxil bû lê qe nebe wek nav Tirkiye li wir bû. Pozîsyona IHH'yê bi pêşniyara Eniya Rizgariya Îslamî ya Moroyê û bi qebûlkirina dewleta Fîlîpînê çêbû. Lewma em di vê mijarê de rehet in. Çarçoveya wê ev e. Çêdibe wiha jî bê nirxandin: her kesî mekanîzma xwe heye. We dî, çênabe ku em çekberdanekê di gel çekberdaneke dî berawird bikin. Çiku ya hemûyan dînamîkên xwe yên din hene. Kêmek berî niha min behs kir, eger min karîbe behs bikim li wir matrîksek hate pêkanîn. Ew ê bê kirin, ev ê bê kirin û ev çarçoveyek e. Eger tenê em çekberdanê yan jî efa giştî ji nav vê çarçoveyê derxin û bêjin bi vê ew tişt dibe, berawirdkirineke rast nabe. Mekanîzma temamiyetek e.

Ji bo beşa duyem a pirsa we, teqrîben 2 sal berî niha li Stenbolê bernameyek li Zanîngeha Sabancî hate lidarxistin, ji seroka panêlê ya aliyê aşitiyê ya Fîlîpînê, ji Xanima Miriamê jî hatibû pirsîn ku bo vir jî hatibûn vexwendin lê nekarîn werin. Xanima Miriamê jî li ser navê me bersiveke wiha da: "Me wek Eniya Rizgariya Îslamî ya Moroyê û dewletê IHH vexwend, ew jî hatin". IHH vexwendineke wisa ji kîjan aliyê cîhanê wergire, diçe û daxil dibe. We ew maf nîne ku hûn înîsiyatîfeke civaka sîvîl pêk bînin û biçin bêjin 'ez aliyê vê me', we ew pozîsyon jî nîne, tu sûda wê jî nîne eger hûn bêjin jî jixwe. Lê hûn diçin li aliyekî disekinin, dibin alî. Feqet ji bo ku hûn li cihekî bin ku her du alî qebûl dikin, divê vexwendin hebe. Ev vexwendin ji wir hat, me jî qebûl kir û bûn beşdar li pêvajoyê.

Eger hûn destûrê bidin, naxwazim zêde berawirdan bikim, dîsan ji bo ku zerarê nedim. IHH têkildarî meseleya kurd vî tiştî dibêje, meseleyeke kurd heye. Heta roja îro têkildarî meseleya kurd xebat hatin kirin. Lê sê aliyên IHH'yê hene. Aliyê wê yê alîkar heye, aliyên wê yên parêzvaniya mafan û dîplomasiya mirovî hene. Zêdetir aliyê wê yê alîkariyê tê zanîn. Qadên me yên xebatê zêdetir li herêmên derveyî Tirkiyeyê bûne, ew li wan qadan dixebitin. Lê ev mesele, nexasim amadekirina rapora yekem, IHH akter bû di warê çêkirina xebatên qadî de li herêmê. Ez dibêjim qey di organîzasyonên xebatên alîkariya mirovî de jî

yek ji binyadên herî çalak e IHH hîna û me gelek derfet çêdibin ji bo ku em biçin gelek herêman û alîkariyê bigihînin wan deran.

Tiştekî girîng e ji bo ku mesele bikeve rojevê. Yek ji xalên girîng ew e ku li Moroyê jî ez girîngiyê didimê. Beşdarkirina her kesî li pêvajoyê, fikra beşdarkirina hemû akteran li pêvajoyê cara yekem ji IHH'yê derket, ji aliyê me ve. Ez dibêjim qey ev jî yek ji wan pozîsyonên girîng e ku hate qebûlkirin.

Çi tişt hene li pişt vê aşitiyê wek binyadîn? Carê, binyadeke taybet e. Neteweyîbûn û xwecihîbûn, tiştê ku em fikir dikin ku li vir pêvajoyê dixetimîne, li Moroyê tam eksê vê heye. Neteweyîbûn û xwecihîbûn esasen bûye beşa sereke ya çareseriyê. Hewl dane ku ti kes, ti pêkhate û ti dewlet li pêvajoyê beşdar nekin ku li herêmê berjewendiyên wan hene. Nexasim misilmanan hem Eniyî hem yên din destûr nedane ku akterên biyanî bikevin herêmê. Eve li herêma me, tiştên ku van demên dawî li Rojhilata Navîn diqewimin û DAIŞ jî li herêmê nebû ku yek ji sedemên bingehîn e ku hişt her alî bişewite. Hewl da bi sengerî bixebite lê çênebû. Tiştekî girîng ku hişt li herêmê nebe mumkîn e ew be ku berjewendiyên derekî li herêmê tunebûn. Min di nav du salên dawî de, têkildarî metirsiyên DAIŞ'ê bi caran hem hişdarî da Fîlîpînê hem jî da Eniya Rizgariya Moroyê. Gava ku DAIŞ hate herêmê, bi pêşbîniyekê tedbîr hatin wergirtin. Rê nedan ku pêvajoyê sabote bike. Binyadîntirîn tişt ez dibêjim qey ev be.

Ya duyem, yek ji wan tiştan ku me têkildarî pêvajoya aşitiyê tesbît kiribû, beşdarkirina hemû aliyan bû. Eniya Îslamî jî pêvajoyek bi rê ve bir ku hemû akter lê hatibûn beşdar kirin. Ne binyadeke bi tena serê xwe bû, gelek binyad hebûn li herêmê. Gava ku em bêtir dikevin nav, cudahiyên etnîk hene. 13 komên serekî yên etnîk hene di nav moroyiyan de. Bi 13 zimanên cuda diaxivin. Zimanekî van ê hevpar jî nîne ku hemû pêkve biaxivin. Lê em ji derve wêneyekî Moroyê dibînin. Di nav xwe de zehmetî û pirsgirêkên dîrokî jî hene. Girîngtirîn tişt ku Eniyê karî bike, ev hemû etnîk ne bi nasnameyên wan ên etnîk lê bi jor-nasnameya moroyîbûnê li pêvajoyê beşdar kirin. Jixwe tiştek ku gelek li ser hate îsrarkirin û qet tawîz jê nehate dayîn ew bû ku Moro bi rêya Parlamentoya Bangsamoroyê bê birêvebirin da ku nûnertiya tam

bo van ciyawaziyan çêbibe. Li wir jî dîsan têkildarî xaniman kotayeke taybet hate danîn. Dawiya dawî civakeke mêr-salar heye. Atmosfera şer jixwe vê yekê tîne. Ev atmosfer di hemû şeran de heye. Ji bo nûnertiya xaniman kotayeke jinan hate dayîn. Kotayeke jinan wê hebe di nav van 80 kesan de. Ev yek nûnertiyê jî pêk tîne.

Me ew jî dît. Aşitiyê binyadeke mezin çêdike lê binyadên biçûk hene ku her dem xwedî wê potansiyelê ne ku pêvajoyê xirab bikin. Lewma jî bêyî ku mezin û biçûk bê gotin divê ew yek bê kirin ku her kes li vî karî beşdar be û xwedî lê derkeve. Yek ji wan karên girîng ku Eniyê karî bike ew bû. Ti daxuyaniyek li dijî yên din neda. Her tim ew vexwendin. Di nav maweya 17 salî ya borî de, tenê ji bilî fîgerekî, ji bilî fîgerekî siyasî, her kes hate pozîsyona piştgîrîkirina aşitiyê. Hinek ji wan yekrast lê daxil bû, hinekan jî got ku em ê rê nedin ku aşitî bê sabotekirin. Yanî karî nûneriya pozîsyona xwe bi awayekî tam bike.

Yek jî mecbûriyet hene. Dibe ku yek ji tiştên girîng ku divê bê binxêzkirin ev bû di mijara binyadîbûnê de. Ji lîderê Eniyê, El Cezîreyê pirsî, “Çima hûn ecele dikin di mijara aşitiyê de?”. Wî jî di bersivê de got, “Ez 50 sal e li daristanan şer dikim”. Zanîngeh ji pola dawî berdaye û dest bi têkoşînê kiriye. Niha gihîştiye ber 70 salî, hê jî berdewam e li şerkirinê. “Di nav vê serdemê de 300 hezar mirov hatin kuştin. 2,5 mîlyon mirov mihacir bûn, ji welêt çûn. Eger ecele nekim jixwe civatek namîne ku aşitiyê bike”. Ev palpiştiyeke gelek girîng e. Li aliyê hember, mumkîn e ev yek we bêhêz bike. Ev hevsengiyek e. Lê aliyê hember jî dizane ku, ne tenê ev, li ba yên mayî jî berxwedaneke gelek mezin hîna heye. Bi wan re dewam dike. Ev pevçûn xilas nabe. Binyadek e ku bi wê hevsengiyê bi rê ve dibin.

Ev çand jî ji wir hatiye. Binyada sereke Eniya Neteweparêz a Moroyê, Nûr Mîswarî, gava ku di gel dewletê aşt bû, hingî Selamet Haşîmî li derve û bêtir binyadeke biçûk bû. Gava ku Nûr Mîsrawî peymana 1996’an îmze kir, qasidek bo Selamet rê kiribû û raya wî pirsîbû di vê mijarê de. Wî jî gotibû, “Ez vê peymanê îmze nakim. Ev peymana me nîne. Lê ez ti tiştî jî nakim ji bo xirabkirina vê peymanê”. Ev çand, esasen li ba hemû komên din jî rengê kev-

neşopiyekê wergirtiye. Navekî gelek girîng e. Selamet Haşîmî, navek e ku li cografyaya me em wî nizanin, gelek kêm nas dikin. Lê bi fikra min navek e ku divê li ser xebat bêne kirin. Bi fikra min divê ew bê naskirin.

Bi rastî jî aşitî şêwejiyan e. Guncawbûn heye? Ez dibêjim qey bîstekî din min bersiva vê yekê dabû. Dîsan gotineke Selamet:

“Hemû şer divê ji bo aşitiyê bin”. Ev pir bi zelalî pozîsyona me diyar dike. Civatek heye ku guncaw e bo vê yekê. Hevraz û nişîv li aliyê dewletê gelek hene. Lê li aliyê Moroyê pêvajoyeke gelek biîstîqrar heye. Eve dewra Marcos, pêvajoya heta 1986’an, pêvajoya EDSA’yê (tevgera gel ku Marcos xist) ji wê pêvajoyê heta çûna Marcos pêvajoyek heye. Siyaseta wî aşitîkirin bû. Lê di vê serdema aşitiyê de jî siyaseteke dewletê hebû ku dixwest binyada li hember xwe parçe û lawaz bike. Hûn nikarin di gel wê bimeşin, aşitî çênabe. Piştî wan pêvajoyên din jî beşek ji serokan aşitî xwestiye lê beşekê jî şer tercîh kirine. Gava ku tê û digihîje serokê pêştir ê dewletê Aquinoyê, şêwejiyana wî gelek guncaw e di gel riwangeha Eniyê. Aliyekî wî heye ku aşitiyê dixwaze û vê yekê aşitî aniye.

Tekzilamî bi rastî tiştekî xeternak e. Belê, hûn vê yekê li Moroyê dibînin. Şer û aşitî her tim vê yekê çêdike. Birêvebirina Fîlîpînê, nexasim piştî 1986’an ji aliyê serok-dewlet ve tê birêvebirin. Partî nînin. Partî bihêz nînin. Zilamek tê hilbijartin, ew zilam heta 6 salan çawa bixwaze wisa dikare siyaseta welêt bi rê ve bibe. Sala heftem jî nîne. Tenê ji bo carekê tê hilbijartin. Heta 6 salan li ser peywirê ye. Sala heftem rengekî bi temamî ciyawaz dikare were. Partiyên li parlamentoyê jî li gorî lîderê nû şêwe digirin. Duterte ku serdema pêşî lîberal bû dikare rengekî neteweparêz bigire, wisa dimeşe. Lewma îstîqrar li cem aliyê hember nîne. Yanî îstîqrarek li ba dewletê Fîlîpînê nîne. Piştî ku gihîştin îstîqrarê di xalekê de, ev peymana aşitiyê derket. Xetimîn çêdibin. Xetimînên gelek mezin çêdibin. Desttêwerdana ku di sala 2014’an de Amerîkayê bi leşkerên xwe yekrast kir, di wê de 44 kes hatin kuştin, wekî bîstekî din min got. Wê pêvajo rawestand. Hewayeke neteweparêz hate pê. Bi dengekî bilind negot. Meclîs jî Senato jî hat û xwe parast. Bi dengekî bilind negot ku dewlet sûcdar e

ji bo ku zemîna aşitiyê ji dest nedin. Her kesî dizanî ku xetaya Eniya Rizgariya Îslamî ya Moroyê nîne. Lê li hêlekê jî jiyana 44 heb leşkeran heye. Atmosferek heye. Bêdengî tercîh kirin, bi sebr rê pan û meşiyan.

Teşebusa dagîrkirina Marawiyê, li gorî min, bi desttêwerdana Amerîkayê hatina DAIŞê bo herêmê bû. Sala par di meha Gulanê de serhildanek li Marawiyê çêbû. Tekane bajarê misilman e li seranserê Fîlîpînê. Hemû bajar hilweşiya. Lê di hişdariyên pêştir de hem dewletê hem jî Eniya Rizgariya Îslamî ya Moroyê xelk qanî kir ku ev yek tiştekî din e, pêvajoyê bandor negirt, bi vî awayî çû. Li gorî min şikesta ji van tiştan gelek xeternaktir, dewra qanûnîbûna dawî bû. Di nav van de, xetên sor ên Eniyê hatine derbaskirin. Tiştekî gelek girîng bû ji bo Eniyê. Di gel vê yekê, bi çareseriya ku min kêmek berî niha got, tercîh kirin bi wê li rê berdewam kin. 'Bêyî ku em maseyê wergerînin, em hemû derfetan bi kar bînin; qet nebe heta dawiya vê dewra veguhêz em binêrin ka bi rastî dewlet ê sozên xwe bigire yan na?' Qanûn qanûn e carê. Yanî êdî bûye hukmekî destûra bingehîn; ji ber ku bi referandûmê hatiye qebûlkirin, guhertina wê jî bes dikare bi referandûmê bê çêkirin. Qanûneke gelek bihêz e. Serok çi sozê bidine we bila bidin. Duterte sozê dide ku ev ê bêne cîbicîkirin. Lê Duterte di 2020'an de wê nebe, serokdewleteke/î din wê hebe. Neçar in ku pêvajoyê bi wî/ê xilas bikin. Ka ew ê cîbicî bike yan na? Rîskeke gelek mezin e ji bo Eniyê. Di gel vê yekê aşitî tercîh kirin û berdewam kirin.

Wekî din... Belê. Fikarên siyasiyan nexasim li ser qanûnîkirina vê pêvajoyê ye. Helbet xweseriya ku ez niha tarîf dikim, esasen ne xweseriyek e ku halê hazir heye. Li ti dera cîhanê xweseriyeke bi vî rengî berfireh nîne ku di gel rêxistinên şoreşger li ser hatibe lihevkirin û pêk hatibe. Beşek girîng ji Fîlîpînê vê yekê ne wek binyadeke xweser, wek jêr-dewletekê fam dikin. Peymaneke gelek dirêj e. Qanûn jî têra xwe dirêj e. Gava ku hûn li mafên wan binêrin jî, bi rastî mafekî gelek berfireh bû, peyman jî hebû. Wan siyasiyan nexasim jî siyasetmedarên herêmên ku binyadên neteweparêz lê bihêz in, ev yek nexwest. Bi wan fikarên siyasî, di wexta qanûnîbûna vê peymanê de hin tişt jê hatin derxistin, wisa çêbû. Min berî niha negot di van mijaran de lê bi fikra min, eger serokdewlet bixwesta, dikarî rê li ber vê yekê bigire.

Fikareke siyasî bo siberojê nîne. Çiku, wekî min got, ji bo carekê tê hilbijartin jixwe. Aşitî kir kir. Li dîrokê wê bê nivîsîn wek aşitîçêker. Wê berdêla vê yekê jî nede. Careke dî wê hesab nede. Wî ev tercîh nekir. Tiştekî wî yê polîtîk heye. Ne tenê ew kes e ku aşitiya Moroyê çêkir, dixwaze Fîlîpînê bigihîne binyadeke federal a wisa ku hemû pevçûnên din ên navxweyî çareser bike. Ew binyada federal, komîsyona destûra bingehîn li ser wê dixebite. Ji bo ku bibe pêpelingek ji wê binyada federal re, vê destûra bingehîn a Moroyê guhertina qanûnê yan jî qanûn kir pêpelingek. Soz da ku bi federasyonê jî mafên din wê bide. Ji bo vê yekê deriyekî vekirî hişt û dest tê werneda, ez difikirim.

Bersiva pirsiyarekê, ez dikarim bi şexsî jî bidim. Me wek IHH ev yek carekê kir. Me zêdetir ji 50 tiran alîkariyeke mirovî li herêmên ku PYD kontrol dike belav kirin. Me di gel sazûmanên xwecihî kir. Paşê ev tişt careke din çênebû êdî. Lê IHH vekirî ye ji her cure hevkariyê re. Eger em zemînekî wisa peyda bikin, li wan qadan eger ewlehiya tîmên me, ewlehiya melzemeyên me bêne gerentîkirin, em dikarin bixebitin. Me tu pirsgirêkek nîne di vê mijarê de.

# ÇARESERIYA PEVÇÛNAN Û CIVAKA SÎVÎL

## Pevçûna Kurd û Pêvajoya Çareseriyê (2013-2015)

**Cuma ÇÎÇEK**

## Destpêk

Pêla nû ya şîdetê di meseleya kurdî de ji Tîrmeha 2015'an ve berdewam dike. Pêvajoya Çareseriyê ya 2013-2015'an, ku hêviyên mezin çêkiribûn li ba raya giştî di mijara xilasbûna pevçûnan û avakirina aşitiya civakî de, piştî Hilbijartinên Giştî yên 07'ê Hezîrana 2015'an bi dawî hat. Pevçûnên ku di dawiya meha Tîrmehê de ji nû ve dest pê kirin, li deverên bajarî gur bûn û di nav sê salên dawî de bûn sedema gelek kuştî,[1] xirapkariyên sosyo-êkonomîk û mekanî [2] ku ne mumkun e bêne qiyaskirin li gel berê. Di vê demê de, destgîrkirina parlementer û şaredaran, te'yînkirina qeyyûman nêzîkî li sed şarederiyan, Şarederiyên Bajarê Mezin a Amed, Mêrdîn û Wanê jî tê de, girtina bi dehan Saziyên Civaka Sîvîl (SCS) ên hestyar bo meseleya kurdî û her wiha girtina saziyên medyayê derbeyeke mezin weşande wê ezmûnê ku hem li qada civaka sîvîl û hem jî li qada siyasî hatibû ser hev.

**1** Li gorî daneyên ajansa nûçeyan a fermî ya dewletê Anadolu Ajansi; di wan opêrasyonan de ku ji Tîrmeha 2015'an heta Çileya 2017'an li nav welêt û li derveyî welêt hatine encamdan, 823 peywirdarên ewlehiyê û 343 hemwelatiyên sîvîl canê xwe ji dest dane û nêzîkî 10.000 endamên rêxistinê jî yan jiyana xwe ji dest dane yan jî bi awayekî ciddî birîndar bûne. Okur, Yunus, "Terör örgütü PKK'ya 557 günde ağır darbe," *Anadolu Ajansı,* 31.01.2017, http://aa.com.tr/tr/turkiye/teror-orgutu-pkkya-557-gunde-agir-darbe/738313, dîroka destgihîştinê: 11.05.2017. Ji aliyê din, li gorî daneyên Komeleya Mafên Mirovan, di navbera Tîrmeha 2015 û Cotmeha 2017'an de teqrîben 3.000 kesî jiyana xwe ji dest daye.

**2** United Nations, *Report on the human rights situation in South-East Turkey: July 2015-December 2016,* United Nations Human Rights Office of the High Commissioner, New York, February 2017, http://www.ohchr.org/Documents/Countries/TR/OHCHR_South-East_TurkeyReport_10March2017.pdf, dîroka destgihîştinê: 26.04.2017.

Civaka Tirkiyeyê hê ew şoka zelzeleya sosyo-polîtîk derbas nekiribû, ku pevçûnên nav-bajaran ku encamên gelek giran pêk anîbûn bûbû sedema wê, bi teşebusa derbeya leşkerî ya 15'ê Tîrmeha 2016'an cara duyem hejaneke siyasî û civakî derbas kir. Di çarçoveya praktîkên Rewşa Awarte de, ku piştî teşebusa derbeyê dest pê kir û du sal dewam kir, paşxistina huqûqê, girtina bi hezaran SCS'yên muxalif û saziyên medyayê, destgîrkirina zêdetir ji sed rojnamegerî, îxrackirina akadêmîsyenên muxalif ku ne têkildar in li gel teşebusa derbeyê, bûn sedema texrîbatê di kevneşopiya demokrasiya Tirkiyeyê de di serî de di mafê raderbirîn û rêxistinbûnê de ku sererastkirina wê zehmet e.

Li aliyekî li qada sosyo-polîtîk zelzeleyeke mezin diqewimî li Tirkiyeyê, li aliyê din şikestinên girîng rû didan di hevkêşeya jêopolîtîk a meseleya kurdî de. Li erdnîgariya kurdan li bakurê Sûriyê, bi rêberiya Partiya Yekîtiya Demokratîk – PYD'ê ku rêxistineke "birader" a *Koma Civakên Kurdistanê* – KCK'ê ye, herêma *de facto* otonom a kurdan wek erdnîgarî bi awayekî balkêş berfireh bû. Kurdên Sûriyê hem di qada leşkerî hem jî di qada siyasî de pêşketinên girîng tomar kirin. Ji aliyê din ve, li Herêma Kurdistana Iraqê ku ji 2003'yan ve li Iraqê wek dewleteke nîv-serbixwe lê hatibû, lêgerînên serxwebûnê di vê demê de zêde bûn. Di 25'ê Îlona 2017'an de hem li parêzgehên Dihok, Hewlêr û Silêmaniyê û hem jî li wan herêmên nîqaş-liser wekî Kerkûkê "Giştpirsiya Serxwebûnê" hate lidarxistin. Di giştpirsiyê de teqrîben ji %72'yê dengderan beşdar bûn û bi rêjeya %92,73 deng dan dengê "Belê"yê.[3]

Dînamîkên ku li jor hatin xulasekirin nîşan didin ku wek civak em gihiştine çerxerêyeke girîng di meseleya kurdî de li Tirkiyeyê. Di çarçoveya sînor-derbas *(cross-border)* de, di demekê de ku qada kurdan[4] şemitok û şikestinbar e, Tirkiye yan wê me seleya kurdî

**3** Rudaw, "Resmi Sonuç – Yüzde 92.73 Evet", 27.09.2017, http://www.rudaw.net/turkish/kurdistan/270920177, dîroka destgihîştinê: 12.10.2017.

**4** Ez konsepta "Qada kurd" *(espace kurde)* ji Jean-François Pérouse digirim. Pérouse bi vê konseptê bal dikişîne dike ku sînorên mobîlîzasyona sosyo-polîtik a kurdan li warên wekî erdnîgarî, çandî, ekonomik û siyasî guherbarû herikbar e. Pérouse, Jean- François, "Reposer la *'question kurde',*" Semi Vaner (Dir.), *La Turquie,* Paris,Fayard, 2005, 357-387.

bi rêyên aşitiyane-demokratîk çareser bike û bibe giraveke demokrasî, aşitî û îstîqrarê li heremê ku her roj dikeve nav xumamiyekê; yan jî dê wek parçeyekî bimîne ji vê xumamî û wan pevçûnan ku ev xumamî dibine sedem.

Pevçûnên nav-welatî/nav-dewletî ku li cîhanê di wext û cihên ciyawaz de qewimîne nîşan didin ku bidawîkirina pevçûnan û avakirina aşitiya civakî bi tena serê xwe bi wan pêvajoyên diyalog û gotûbêjên navbera akteran ku rasterast beşdar in li pevçûnan çareser nabe. Ew her sê pêvajoyên diyalogê yên 1999 û 2015'an jî ku li Tirkiyeyê çêbûn vê rewşê piştrast dikin. Bi qasî akterên ku pev diçin, pêvajoyên diyalog û levkirinê yên navbera wan akteran jî xwedî girîngiyê ne ku di komên ciyawaz ên civakê de cih digirin, bi gotineke din akterên ku di qada civaka sîvîl de ne. Xebatên "avakirina aşitiya civakî" fonksiyoneke krîtîk digerîne di xilaskirina pevçûnên nav-welatî de ku mebesta wan derbaskirina wan meseleyan e ku ji ber pevçûnan di qadên wekî êkonomîk, civakî, çandî, siyasî û saykolojîk de çêbûne.

Ev lêkolîn pozîsyon û zerfiyeta SCS'yan a ji bo xilaskirina pevçûnan di meseleya kurdî de û avakirina aşitiya civakî enelîz dike. Di vê çarçoveyê de, nirxandinê li ser xebatên çareserkirina pevçûnan û avakirina aşitiya civakî yên SCS'yan dike di Pêvajoya Çareseriyê ya 2013-2015'an de. Cih û rola SCS'yan dîsan bi çavê SCS'yan enelîz dike hem di Pêvajoya Çareseriyê ya têkçûyî de hem jî di pêvajoya gotûbêjeke muhtemel de.

Wek rêbaza lêkolînê, teknîka kualîtatîf (qualitative research technique) hatiye bikaranîn. Di navbera 15'ê Gulanê û 30'yê Tîrmeha 2017'an de li gel 45 SCS û sê pisporan li Amed, Wan, Stenbol û Enqereyê hevdîtînên nîv-sazkirî (semi-structured interview) hatine kirin. Gava ku sazî hatin hilbijartin, li ser bingeha heft fonksiyonên bingehîn ên SCS'yan ji bo çareserkirina pevçûnan û avakirina levkirinê, esasen ew SCS hatin tercîhkirin ku di Pêvajoya Çareseriyê de yek ji wan fonksiyonan yan jî hinek ji wan fonksiyonan bi cih anîne. Ligel şerta xebitîna di Pêvajoya Çareseriyê de; bi heman awayî hewl hate dayîn ku bi SCS'yên cihêreng re hêvdîtin bên kirin ku di qadên ciyawaz de xebatan dikin û xwedî motîvasyonên ciyawaz ên sosyo-polîtîk in. Bi mebesta

rengvedana dengê wan qadên kurdan ku pevçûn lê gurr bûne, bajarên Amed û Wanê hatin hilbijartin ku wek mêtropolên herêmî ne. Bi mebesta têgihîştina meyla giştî li seranserê Tirkiyeyê jî, du bajarên sereke, Stenbol û Enqere, hatin tercîhkirin ku xwedî zerfiyeteke wisa ne ku bandorê li seranserî welêt dikin û xebatên civaka sîvîl li van bajaran gurr bûne.

## 1. SCS û Çareserkirina Pevçûnan: Çarçoveyeke Têorîk

J. P. Lederach, yek ji wan kesan e ku di mijara çareserkirina pevçûnan û avakirina aşitiya civakî de derdikeve pêş, di berhema xwe de ya bi navê B*uilding Peace: Sustainable Reconciliation in Divided Societies*[5] (Avakirina Aşitiyê: Lihevkirinên Domdar di Civakên Parçebûyî de) pêvajoyên gotûbêjan ji bo avakirina aşitiya civakî û akterên wan pêvajoyan di sê astan de kombend dike: pêşengiya asta bilind, pêşengiya asta navincî û pêşengiya di asta civakî de.

Li gorî vê yekê, ew gotûbêjên ku di çarçoveya pêşengiya asta bilind de bi rê ve diçin, di navbera pêşengên leşkerî, siyasî yan jî dînî de pêk tên ku di asteke bilind de xwedî bijaretiyekê ne. Di van gotûbêjan de ku di asta bilind de pêk tên, esasen mijarên wekî agirbestê tên gotûbêjkirin û dîsan tenê ji aliyê navbînkarekê ve tên birêvebirin ku xwedî bijaretiyeke payebilind e.

Gotûbêjên bi pêşengiya asta navincî van kesayetan vedihewîne: birêveberên rêzdar ên sektorên cuda, pêşengên êtnîk û dînî, akadêmîsyen, rewşenbîr û navên ku di qada civaka sîvîl de derdikeven pêş. Gotûbêjên ku di vê astê de tên birêvebirin ji xebatên wekî komxebatên çareserkirina meseleyan, perwerdehiya çareserkirina pevçûnan, komîsyonên aşitiyê, xebatên hundur yan jî jêr-komîsyon pêk tên.

Wek dawî, pêşengên di asta civakî de pêk tên ji pêşengên di asta heremî/mehelî de yên wekî birêveberên SCS'yan, rûspî û birêveberên saziyên wekî perwerde û tendirustiyê ku xizmeta giştî

**5** Lederach, John Paul, *Building Peace: Sustainable Reconciliation in Divided Societies,* Washington, D.C.,United States Institute of Peace Press, 1999, rp. 39.

pêşkêş dikin. Di Şeklê 01'ê de ew modêl hatiye nîşandan ku ji aliyê Lederachî ve hatiye pêşxistin.

Modêlê ku Lederach pêş xistiye xwedî girîngiyekê ye ji ber ku nîşan dide ku çareserkirina pevçûnan û avakirina aşitiya civakî pir-astî û pir-akterî ye. Her wiha, modêl, bi baldan li mezinahiya nufûsê, nîşan dide ku têkilîdanîna civakî û gotûbêjên bi pêşengiya asta navincî û asta civakî bi qasî wan xebatên aşitiyê girîng in ku di qada pêşengiya asta bilind de tên birêvebirin. Lewma cext(kirpandin)ê li ser girîngî û rola wan akteran dike ku di xebatên çareserkirina pevçûnan û avakirina aşitiya civakî de di asta navincî û asta civakî de cih digirin.

Jinavbirina wan tirs û xetereyan ku di wexta pevçûnan de derketine, guhertina îdraka komên ciyawaz ên civakî û çareserkirina cemserbendiyên civakî, bi kurtî avakirina "aşitiya civakî" girêdayî ye bi civakîkirina pêvajoya çareserkirina pevçûnan û levkirinê;[6] her wiha girêdayî ye bi avakirina levkirina civakî.[7] Her wekî ku di vê nêrînê de jî tê dîtin ku ji aliyê Lederachî ve hatiye pêşxistin, SCS akterek in ji wan akterên krîtîk çi di xebatên asta navincî de û çi jî di xebatên asta civakî de û roleke girîng di avakirina levkirina civakî de dilîzin.

**6** Çelik, A. Betül ve Mutluer, Nil, di nav "Toplumsal Barış ve Barış Süreci'nin Toplumsallaşması,": Necmiye Alpay & Hakan Tahmaz (brhv.), *Barış Açısını Savunmak. Çözüm Sürecinde Neler Oldu?,* İstanbul, Metis Yayınları, 2015, 59-75.

**7** Çelik, A. Betül, di nav "Kürt Meselesini Dönüştürmede Toplumsal Mutabakat İhtiyacı: Neden, Nasıl, Kimle?,": Murat Akbaş (brhv.), *Çatışma Çözümleri ve Barış,* İstanbul, İletişim Yay., 2014, 131-152.

Şekl 01: Nêzîkbûnên Avakirina Aşitiyê û Akter




**Çavkanî:** Lederach, John Paul, Building Peace: Sustainable Reconciliation in Divided Societies, Washington, D.C., United States Institute of Peace Press, 1999, rp. 39.

Ji aliyê din, ew tecrubeyên ku di van salên dawîn de derketine, nîşan didin ku SCS dikarin roleke krîtîk di pêşengiya asta bilind de jî bilîzin. Bo nimûne, li Fîlîpînê li ser herêma Bangsamoroyê pevçûnên ku bi dehan salan di navbera hukumet û Bereya Rizgariya Îslamî ya Moroyê (Moro Islamic Liberation Front – MILF) de rû dan û bûn sedema mirina zêdetir ji 100.000 mirovî, bi navbînkariya pêkhateyeke têkel ji dewlet-SCS'yan bi daxilbûna dewletên Îngîlistan, Japonya, Erebistana Su'udî û Tirkiyeyê di gel çar SCS'yên navneteweyî bi dawî bûn. Çavkaniyên Levanînê navend-London *(Conciliation Resources),* Navenda Diyaloga Mirovî navend-Cenêv *(Center for Humanitarian Dialogue),* Cimeeta

Mihemediye navend-Êndonêzya û Cimeeta Sant'Egidio navend-Rome *(Community of Sant'Egidio)* tevkariyeke girîng pêşkêşî Pêvajoya Çareseriyê ya Fîlîpînê kirin.[8] Koma Temasê ya Navneteweyî *(International Contact Group)* ku li Fîlîpînê hate pêkanîn, bi "mekanîzmeke têkel ji dewlet û akterên xeyrî-dewlet ku pêkve tê de cih digirtin û berî niha jî şibhê wê tunebûn"[9] rêfêranseke girîng di xebatên aşitiyê de pêk anî. Li Fîlîpînê di qonaxa çavdêrîkirina peymanê de jî SCS'yan roleke krîtîk lîst û dilîzin. "Tîma Çavdêriyê ya Aliyê Sêyem" (*Third-Party Monitoring Team* – TPMT) ku tê de ji Tirkiyeyê Weqfa Maf û Azadiyên Mirovan û Alîkariya Mirovî[10] jî heye, berpirsiyar e ji çavdêrîkirina guncawbûna wan gavan li peymanê ku alî dê piştî peymanê biavêjin û her wiha berpirsiyar e ji raporkirina wan. TPMT bi serokatiya aktereke/î bêlayen î navneteweyî, ji SCS'yeke xwecihî û navneteweyî pêk tê ku ji aliyê dewlet û MILF'ê ve hatine pêşniyarkirin.[11]

Her wekî li Fîlîpîn-Bangsmoroyê, di pevçûnên Êndonêzya-Açeyê de jî civaka sîvîl roleke krîtîk lîst di qada pêşengiya asta bilind de. Li ser pevçûnên 30 salî li Êndonêzyayê, bi navbînkariya Înîsiyatîfa Birêvebirina Qeyranê *(Crisis Management Initiative* - CMI) ku bi pêşengtiya kevneserokê Fînlandê Martti Ahtisaari hate avakirin û SCS'yeke navneteweyî ye, di encama pêvajoya hevdîtinên pênc dewran de levkirin pêk hat.[12] Her wiha, prênsîba "di tu mijarekê de levhatin bi awayekî rasteqîne çênabe heta ku di her mijarê de levhatin çênebe" ku ji aliyê Athisaari ve hate pêşxistin

**8** Democratic Progress Institute (DPI), *Briefing: International Contact Group for the Southern Philipines Peace Process,* Democratic Progress Institute, 2014; Söylemez, Hatice, *Moro: Uzakdoğu'da Bir Bağımsızlık Mücadelesi,* İstanbul, İHH İnsani ve Sosyal Araştırmalar Merkezi, 2016, jimareya rp. 146-148.

**9** Democratic Progress Institute (DPI), *'Çatışma Çözümünde Filipinler Deneyimi' Konulu Karşılaştırmalı Çalışma Ziyareti Raporu,* Londra, Democratic Progress Institute, 2016, rp. 20.

**10** DPI, age., rp. 40; Söylemez, Age., jimareya rp. 151-152.

**11** DPI, age., rp. 40.

**12** Aspinall, Edward, *The Helsinki Agreement: A More Promising Basis for Peace in Aceh?,* Policy Studies No. 20, Washington, D.C., East-West Center, 2005.

bû rêfêranseke girîng di xebatên aşitiyê de. Ahtisaari, nêrîna "zindî-hiştina pêvajoya gotûbêjan"[13] ya "têoriya pisîklêtê" bi prênsîba jorê xiste pratîkê ku ev têorî ji aliyê nûnerê hukumeta Tony Blairî J. Powelî ve, ku hemû pêvajoya aşitiyê ya Brîtanya-Îrlenda Bakurî rasterast bi rê ve dibir, hatibû formîlekirin. Li gorî vê yekê, ew ciyawaziyên levneker ku di navbera pozîsyonên aliyan de hene, bi zindî-hiştina pêvajoya gotûbêjan dikarin bêne çareserkirin û vê prênsîbê ev zindîbûn pêk aniye. [14]

Bi kurtî, di her sê astan de jî SCS roleke girîng di çareserkirina pevçûnan û avakirina aşitiyê de dilîzin. Jê zêdetir, ew tecrubeyên pêvajoya aşitiyê ku SCS van salên dawîn li wan beşdar bûne, di mijara çareserkirina pevçûnan û avakirina levkirinê de rêfêranseke girîng pêk tînin.

T. Paffenhon û C. Spurk, ku li ser rola SCS'yan di avakirina levkirina civakî de dixebitin, binê heft fonksiyonên van rêxistinan xêz dikin: **(1)** parastina hemwelatiyan, **(2)** şopandin û berpirsiyarî-qebûlî, **(3)** parêzvanî û ragihandina giştî, **(4)** civakîbûna nav-komî û çanda aşitiyê, **(5)** pêkvebûna civakî ya hestyar bo pevçûnan, **(6)** navbînkarî û asankarî û **(7)** xizmetkirin yan pêşkêşkirina xizmetan bi awayekî rasterast (Bnr: Şekl 02). [15]

---

**13** Powel, Jonathan, *Teröristlerle Konuşmak: Silahlı Çatışmalar Nasıl Sona Erdirilir?,* İstanbul: Aykırı Yayıncılık, 2014.

**14** Aspinal, age., jimareya rp. 22-23.

**15** Paffenholz, Thania & Spurk, Christoph, "Civil Society, Civic Engagement, and Peacebuilding," *The World Bank Social Development Papers: Conflict Preventation and Reconsturciton,* Paper No. 36, Washington, DC, October 2006; Paffenholz, Thania & Spurk, Christoph, di nav "A Comprehensive Analytical Framework,", Thania Paffenholz (ed.) *Civil Society and Peacebuilding: A Critical Assessment,* Boulder, Lynne Rienner Publishers, 2010, 65-76. Di nav vê berhemê de, li ser bingeha heft fonksiyonên bingehîn ên SCS'yan hedîseyên Guatemala, Îrlenda Bakur, Bosna Hersek, Tirkiye, Qibris, Îsraîl/Filîstin, Efxanistan, Nêpal, Srî Lenka, Somalî û Nîjêrya bi kûrahî tên gotûbêjkirin. Xebata ku Ayşe Betul Çelikê li ser Tirkiyeyê kiriye, enelîzeke girîng pêşkêş dike li ser rola SCS'yan di mijara bidawîkirina pevçûnan –ku ji ber meseleya kurdî derketine- û avakirina aşitiya civakî de; her wiha enelîzeke girîng dike li ser kîjan fonksiyon di çi astê de pêş ketiye û divê çi bên kirin. Bnr.: Çelik, A. Betül, di nav "Turkey: The Kurdish Question and the Coersive State,", Thania Paffenholz (Ed.), *Civil Society and Peacebuilding: A Critical Assessment,* Boulder, Lynne Rienner Publishers, 2010, 153-179.




Şekl 02: Çareserkirina Pevçûnan û Heft Fonksîyonên SCS'yan

*Parastina hemwelatiyan;* di wexta pevçûnan de parastina jiyan, azadî û milkiyeta hemwelatiyên sîvîl li hember dewlet û otorîteyên xeyrî-dewlet li xwe digire. Di vê çarçoveyê de ji bo xebatên ku derdikevin pêş wek nimûne ev dikarin bêne anîn: pêkanînan herêmên aşitiyê yên çek ne tê de, rakirina mînan, parastina hemwelatiyan, bêçekkirina leşkerên zarok û beşdarkirina wan li nav jiyana civakî.

*Fonksiyona şopandin û berpirsiyarî* qebûlî çavdêrîkirin û tesbîtkirina xebatên dezgeha dewletê -di serî de-, hukumetê û akterên pevçûnan li xwe digire. Bo nimûne, tesbîtkirina pêşêlkariya mafên mirovan ên ji ber pevçûnan û berpirsiyarên wan; ji akterên têkildar daxwazkirina mecbûrbûn bo hesabdanê di çarçoveya vê fonksiyonê de dikare bê nirxandin.

*Fonksiyona parêzvanî û ragihandina giştî xebatên pêşkêşkirin û belavkirina zanyariyên* li ser pevçûnan bo raya giştî bi liberçavgirtina berjewendiyên giştî û hemwelatiyan –nexasim yên komên vederkirî- li xwe digire. Di vê mijarê de nimûneyên wiha dikarin bên anîn: kempeniyên zêdekirina agahdariya civakî li ser mirina zarokan ji ber pevçûnan, liv û tevgera cemawerî yan jî xebatên lobîgeriyê li gel akterên siyasî ji bo ji nû ve destpêkirina hevdîtinan.

*Fonksiyona civakîbûna nav-komî* wan xebatan li xwe digire ku SCS'yan ji bo belavkirina çanda aşitiyê di nav komên civakî yên ciyawaz de kirine. Di vê mijarê de, behsa xebatên wiha dikare bê kirin: diyaloga navbera ciyawaziyan, çêkirina bername/rêzefîlmên têlevîzyonî yan jî radyoyî li ser mijara pêkvejiyanê, şanoyên nav-kuçeyan, çalakiyên werzişî, mîhrîcanên mûzîkê yan jî paqijkirina kitêbên dibistanan ji fikrên cudaker.

*Fonksiyona pêkvebûna civakî ya hestyar* bo pevçûnan wan xebatan li xwe digire ku ji bo danîna jêrxanekê tên kirin ji bo ku beşên ku pev diçin bikarin wek hemwelatiyên wekhev bijîn di civakê de. Ev fonksiyon esasen fokisa xwe dide ser wan çalakiyên hevpar ku di navbera komên dijmin ên kevn û nû de tên kirin. Ev nimûne di çarçoveya hemahengiya civakî de dikarin bên dayîn: levcivandina wan kesan ku xwedî fikrên siyasî yên dijîhev in, levcivandina malbata wan kesên jiyana xwe ji dest dane ku di aliyên cuda yên pevçûnan de cih girtine yan jî teşebusên hevpar bo aşitiyê ku ji aliyê van malbatan ve hatine kirin.

*Fonksiyona navbînkarî û asankariyê,* wan xebatan li xwe digire ku ji bo pêşvebirina diyalogê di asta xwecihî û neteweyî de di navbera wan komên ciyawaz ên civakî de tên kirin ku piştgiriya wan koman dikin ku pev diçin. Wek nimûne ev xebat dikarin bêne dayîn: teşebuskirin ji bo serbestberdana wan leşkeran ku hatine ragirtin, ragihandina agirbestê yan jî hevdîtinkirin li gel akterên pevçûnan ji bo rojên bêşîdet, wek çavdêr daxilbûn li pêvajoya diyalog û gotûbêjan ku di navbera akterên pevçûnan de bi rê ve diçin.

Wek dawî, *fonksiyona dabînkirina xizmetan*, wan xizmetan li xwe digire ku di wexta pevçûnan de yan jî piştî pevçûnan ji bo mexdûran di qadên wekî civakî, bijîşkî, huqûqî, êkonomîk û hwd. de tên pêşkêşkirin. Xizmet dikare di qadên curbecur de bê pêşkêşkirin; ji alîkariya xorakê ji bo wan kesan ku ji ber pevçûnan ji cihên xwe bûne bigire heta piştgiriya huqûqî yan jî saykolojîk, her wiha bi awayekî rasterast pêşkêşkirina xizmeta tendirustiyê ji bo wan kesan ku rastî şikenceyan hatine.

Li ser bingeha wê çarçoveya têorîk ku li jor hatiye xulasekirin, di beşên li jêr de rola SCS'yan di xilaskirina pevçûnan ku ji ber meseleya kurdî li Tirkiyeyê derketine û avakirina levkirina civakî de hatiye enelîzkirin.

## 2. SCS'yan Çi Kir di Pêvajoya Çareseriyê de?

Gava ku beşdarbûn û tevkariya SCS'yan li Pêvajoya Çareseriyê bi hûrgilî bê vekolîn, li gorî encamên lêkolînên qadê, mijara yekem ku divê binê wê bê xêzkirin ev e: SCS'yan di Pêvajoya Çareseriyê de esasen fokisa xwe dan ser wan xebatên lobîgerî û parêzvaniyê ku hukumeta AK Partiyê û Tevgera Kurdan a sereke bo xwe navend digirin. Hatiye çavdêrîkirin ku piraniya SCS'yan di astên curbecur de bi pêşkêşkirina fikrên xwe bi devkî û nivîskî hem bo hukumeta AK Partiyê û hem jî bo pêkhateyên Tevgera Kurdan a sereke hewl dane ku mudaxil bin li pêvajoyên diyarkirina polîtîkayan. Bo nimûne; nûnerê SCS'yekê, ku li Amedê di qada aboriyê de xebatan dike, diyar dike ku di Pêvajoya Çareseriyê de ezmûneke girîng î zanyariyan li ser meseleya kurd çêbû li ba dewletê û di çêbûna vê ezmûna zanyariyan de SCS'yan roleke girîng lîst. Her wiha binê wê yekê xêz dike ku piraniya zanyariyên ku ji aliyê bîrokrasiyê ve ji xwecihê bo navendê dihatin veguhestin, ji aliyê SCS'yan ve "dihatin sererastkirin". Ji aliyê din, piraniya SCS'yan derdibirin ku wan fikrên xwe ragihandine hukumet û Tevgera Kurdan a sereke, lê belê karîger nebûne û akterên siyasî bala xwe nedane wan di gelek rewşan de.

Duyem; her çi qas ku dewlet û Tevgera Kurdan a sereke li gorî pêwîst bala xwe nedabe zanyariyên ku ji aliyê SCS'yan ve hatine hilberandin, her wekî ku hin beşdaran îşaret pê dikir, di vê dewrê

de meseleya kurd di qada giştî de xuya dibû wisa ku nikare bê qiyaskirin li gel berê û mesele ji aliyên xwe yên ciyawaz ve di nav beşên berfireh de hate axaftin. Bo nimûne; nûnerê SCS'yekê, ku li Enqereyê di qada civakî de xebatan dike, diyar dike ku gelek meseleyên ku me berê nedikarîn biaxivin, di Pêvajoya Çareseriyê de bi rehetî me nîqaş dikirin. SCS'yan roleke krîtîk lîstin ji bo ku mesele di vê astê de bê axaftin û nîqaşkirin di qada giştî de. Di vê mijarê de, gelek beşdar îşaret bi Lijneya Mirovên Aqil dikin. Piraniya nûnerên SCS'yan, tevî ku rexneyên xwe yên ciyawaz hebin, Lijneya Mirovên Aqil wek xebateke civaka sîvîl dinirxînin. Bicihgirtina gelek kesayetan di nav lijneyê de ku bi xebatên xwe yên qada civaka sîvîl tên naskirin û xwedî nasnameyeke sazgehî ne, dîsan têkilîçêkirin li gel SCS'yan gava ku lijneyên herêmî çûn bajarekî, du sedemên bingehîn ên vê nirxandinê pêk tînin.

Sêyem; her çend ku wek çavekî sêyem nekarîn li pêvajoyê beşdar bin ku aliyan ew wek fermî nas kiribin, dîsan jî hatiye çavdêrîkirin ku SCS'yan navbînkarî kiriye hem di navbera rayedarên dewletê ên xwecihî û pêkhateyên Tevgera Kurdan a sereke de û hem jî di navbera HUDA-PAR û HDP de. Ev rewş nexasim ji bo Amedê derbasdar e. Ev teşebusên navbînkariyê gava ku Pêvajoya Çareseriyê berdewam dikir, di rûdanên wekî bûyerên 6-8'ê Cotmehê ji bo Kobanê, rêgirtin, serbestberdana peywirdarên giştî de gelek caran karîger bû. Di gel vê yekê, di xendek û pevçûnên nav-bajaran de ku piştî ku Pêvajoya Çareseriyê bi dawî hat qewimîn, teşebusên navbînkariyê bi ser neketin. Di mijara navbînkariyê de, her wiha hatiye çavdêrîkirin ku hin akterên civaka sîvîl, ku li ser bingeha zanyariyan parêzvaniyê dikin, pir û carinan rasterast carinan jî nerasterast mêkanîzmên diyalogê çêkirine di navbera komên siyasî, camîeya kar û bar û camîeya SCS'yan de ku li meseleya kurd ciyawaz dinêrin.

Çarem; hatiye çavdêrîkirin ku bi dirêjahiya Pêvajoya Çareseriyê hin SCS'yan ku li ser bingeha mafî xebatan dikin, înîsîyatîf wergirtine û qadên nû vekirine têkildarî qadên xebatan û bi vî awayî hewl dane ku tevkariyê li pêvajoyê bikin. Bo nimûne, Lijneya Şopandinê ya de facto ku li Amedê ji 25 kesan pêk hat, ji bo vê yekê dikare bibe mînak. Bi dirêjahiya pêvajoyê, vê lijneyê, ku hem PKK û hem jî akterên dewletê şopandine û di wexta qey-

ranan de hewl daye mudaxil be, car caran feedback dane aliyan û xebat kirine ji bo bin-nekeftina pêvajoyê. Dîsan hatiye çavdêrîkirin ku SCS'yekê, ku li seranserê Tirkiyeyê di qada zayenda civakî û aşitiyê de xebatan dike, xebatên gelek girîng kirine ji bo ku pêvajo berdewam bike bi awayê hestyar bo zayenda civakî. SCS'ya navborî, li gel wan 14 jinan hevdîtinê dike ku di nav Lijneya Mirovên Aqil de cih digirin û hewl daye ji bo ku xebatên pêşîn ên lijneyê hestyar bin bo zayenda civakî. Xebatên saziyê hem bi her du aliyên pêvajoyê û hem jî bi akterên din ên siyasî bi hevdîtinên manend berdewam kirine. SCS'yek, ku di qada edalet û rûbirûbûn li gel rabirdûyê de xebatan dike, di wexta Pêvajoya Çareseriyê de ji bo ku van mijaran bixe rojeva partiyên siyasî, hem li gel hukumetê hem li gel HDP û hem jî li gel CHP di astên curbecur de têkilî danîne.

Li Wanê di Pêvajoya Çareseriyê de –dibe ku ji ber wê konfîgerasyona siyasî ya bajêr be ku xwe dispêre du hêzên hejmonîk- hatiye çavdêrîkirin ku bi awayekî nisbî xebatên civaka sîvîl bêtir serkeftî bûne. Cuda ji Amed, Stenbol û Enqereyê, hatiye çavdêrîkirin ku li bajarê Wanê di navbera wan SCS'yan de ku bi motîvasyonên çep-sêkûlêr û îslamî-parêzgarîkar xebatan dikin, hewlên diyalog û hevkariyê derketine holê û mobîlîzasyoneke gelek girîng hatiye çêkirin ji bo avakirina aşitiya civakî di xwecihê de. Hin SCS'yan înîsiyatîf wergirtine û xebat kirine bi mebesta avakirina aşitiya civakî. Nûnerê SCS'yeke bi rêfêransa îslamî-parêzgarîkar ku di nav vê înîsiyatîfê de cih girtiye, bi van gotinan xebatên kirî xulase dike:

> Bi destpêkirina Pêvajoya Çareseriyê, me pêkve înîsiyatîfek pêk anî û wekî ku min got ji van derdorên ciyawaz ango ji HUDA-PARê bigire heta AK Partî û HDPê me hewl da ji bo ku her kesî em kom bikin di nav vê înîsiyatîfê de. Li gel komîsyona ku me di vê înîsiyatîfê de pêk anî, me hewl da ji bo ku em herêmên opêrasyonan bigerin. Xebateke hişmendkirinê ye li ser aşitiyê... Bo nimûne em çûn tabûran, em çûn parêzgariyê, em çûn qayimqamiyê, em çûn şaredariyan û partiyan... Em li Elbakê, cihê ku opêrasyon lê tên kirin, û li gundan geriyan. Li wir em çûn tabûran. Em bûn mêvanê tabûran. Vê yekê moreleke fewqalade çêkir hem li ba xelkê hem jî li ba aliyên pevçûnan.

Li ser vê mijarê nûnerê SCS'yekê, ku li Wanê ye, diyar dike ku beşdarbûna çalak li pêvajoyê ya çend SCS'yan ku di lokalê de xwedî roleke krîtîk in, bandoreke domînoyî çêkir û li seranserê bajêr liv û tevgerek afirand. Beşdar dînamîzma ku li bajêr çêbû û bandorên wê bi van gotinan îfade dike:

> Li Wanê teqrîben hemû pêkhateyan –çi pêkhateyên îslamî çi hemû pêkhateyên ji aliyê din- tevkariyên erênî pêk anîn. Bi nîqaşkirinê jî esasen ev tevkarî bû. Ev xebat tevkariyek bû. Beşa îslamxwaz yan jî ji kevneşopiya îslamî tê ku di aliyê herî dijber de disekine li ser vê meseleyê, piştî demekê neçar man ku li meseleya kurd angaje bin. Di vê mijarê de, wêdetir ji dîskûrsa 20 sal berî niha, neçar ma ku dîskûrsên nû qebûl bike ku ev yek jî pêşveçûnek bû. Yaxud di vir de tiştekî din bêjim ku gelek çeptir e, nûnerên CHP yaxud yên MHPê jî di nav vê rojeva germ û gur de hatibûn wê rewşê ku hin tiştan bikarin nîqaş bikin.

Pêncem, hatiye çavdêrîkirin ku hin SCS'yan zêdetir ji xebatên di asta akterên siyasî de, xebatên ku di qada civakî de bi awayekî rûtîn kirine yan jî berî niha nekarîne bikin û paş xistine di vê dewrê de bi awayekî karîgertir kirine. Bo nimûne; SCS'yek, ku ji bo mexdûrên pevçûnan xebatan dike, dibêje ku lêkolînên qadê û karê pêkanîna ênvantêrê ku berî wê demê ji ber meseleyên siyasî û huqûqî me nedikarî bike, di wexta Pêvajoya Çareseriyê de bi rehetî û bi awayekî me ew xebat kirin ku hemû herêmên pevçûnan li xwe digirin. Nûnerê SCS'yeke din ku piştgiriya sayko-sosyal bo mexdûrên pevçûnan dabîn dike, diyar dike ku ji bo çareseriyeke siyasî ya muhtemel, zerfiyetên xwe yên sazgehî hêzdar kirine ji bo ku bêtir tevkariyê bikin di qadên xwe yên pisporiyê de. Nûnera SCS'yekê, ku di warê jin û aboriyê de xebatan dike, binê wê yekê xêz dike ku wan di vê demê de bi mebesta kêmkirina bandorên zêdeker ên şîdetê di kuçe û jiyana rojane û kargehan de xebat kirine.

Şeşem; hin nûnerên SCS'yan diyar dikin ku ne tenê bi dirêjahiya Pêvajoya Çareseriyê, her wiha di destpêkirina pêvajoyê de jî zextên civaka sîvîl karîger bûn. Diyar dikin ku di encama wan xebatan de ku li seranserê welêt di qada civaka sîvîl de hatine kirin, mesele bi rêjeyeke mezin civakî bû û daxwazeke civakî

derket meydanê ji bo çareseriyê. Li gorî vê yekê, xebatên qada civaka sîvîl bandoreke girîng çêkir ji bo ku ji aliyê layenan ve ev daxwaza civakî û pêwîstiya gav-avêtinê bê dîtin. Dikare bê gotin ku ev rewş nexasim li qada kurdan derbasdar bû. Ji ber ku hem di mijara çareserkirina pevçûnan û avakirina aşitiya civakî de ji bo ku agahdarbûn bigihê hemû beşan û hem jî li ba qada kurdan ji bo ku ew têgihîştin hakim bibe ku çareseriya meseleyê bi şîdetê ne mumkun e, SCS'yan tevkariyeke gelek girîng li wan kir. Bi gotina nûnerekî, ku li Amedê li ser bingeha mafî dixebite, SCS'yan "esasen ji aliyekî ve kurd, Amedî çi difikirin, çi dixwazin, çi arezû dikin li hemû welêt belav kirin".

Dawî jî; hatiye çavdêrîkirin ku hin SCS'yan xebat kirine ji bo pêşvebirina zerfiyeta akterên civaka sîvîl di mijara çareserkirina pevçûnan û avakirina aşitiya civakî de. Di vê mijarê de xebatên ku herî zêde derdikevin pêş; atolye, komxebat û gerên qadan in ku tê de bûyerên wekî hev tên vekolîn û nîqaşkirin. Di lêkolînên qadê de hatiye çavdêrîkirin ku gelek nûnerên SCS'yan ku hevdîtin li gel wan hatine kirin, ji bo ku pêvajoyên manend di cihên wan de bibînin, li projeyên parvekirina tecrubeyan beşdar bûne.

**3. SCS'yan Nekarî Çi Bikin?**

Gava ku li zerfiyet û dijwariya meseleya kurd bê nêrîn, xebatên li jor xulasekirî nîşan didin ku beşdarî û tevkariya SCS'yan li Pêvajoya Çareseriyê têra xwe sînordar bû. Her wekî ku beşdarek, ku li Amedê li ser bingeha mafî dixebite, binê wê xêz dike akterên civaka sîvîl bi giştî di qadên "beyankirina fikran û li ser vê bingehê çêkirina civînan û birêvebirina dîplomasiyê" de karîger bûn. Di gel vê yekê, di Pêvajoya Çareseriyê de "nekarîn gaveke pêşvetir bifikirin û vê yekê bisêwirin û wek zanyarî û nexşerêyekê bixine ber aliyan".

Beşdarek, ku li Stenbolê li ser bingeha zanyariyan parêzvaniyê dike, diyar dike ku SCS'yan ne karî zanyariyan hilberînin û pêşiya aliyan vekin û pêvajoyê asantir bikin ne jî karîn wê rolê bi cih bînin ku civakê, ku bi dirêjahiya pevçûnên 40 salî "jehravî bûye", ji wan hêvî dikir ji bo mijarên "aşitiya civakî", "pêkvejiyan li gel ciyawaziyan", "çareserkirina meseleyan ne bi rêya çekan lê bi

rêya axaftinê li rexmî ciyawaziyan", "derbirîna ciyawaziyan di zemîneke demokratîk de". Hin beşdar her çi qas ku diyar dikin ku bi rêya Lijneya Mirovên Aqil di asteke baş de aşitî li civakê hate xomalîkirin û ji bo aşitiyê rizamendiya civakî hate hilberandin, lê gelek beşdar binê wê yekê xêz dikin ku "aşitî nekarî bê civakîkirin". Di vê mijarê de gelek beşdar bi bîr dixin ku hetta raporên herêmî yên Lijneya Mirovên Aqil jî nehatin eşkerekirin. Beşdarek, ku li Stenbolê li ser cudakarî û avakirina wekheviya navbera ciyawaziyên civakî dixebite, bi van gotinên xwarê pozîsyona pasîf a SCS'yan derdibire ku di Pêvajoya Çareseriyê de wergirtine:

> Girîngtirîn sedem ji bo têkçûna pêvajoya dawîn, xomalînekirina pêvajoyê bû li beşên civakî. Ji ber ku eger pêvajoyek bûya ku xomalîkirî bûya li beşên civakî, [...] li hember her helwesteke dewlet yan jî PKK'ê dê bigotana "Binêrin em aşitiyê dixwazin. Ev yek, mumkun e ku bibe asteng li ber vê" û bi vê yekê mêkanîzmên îqazkirinê ji civaka sîvîl, dikarî bo wan biçe. Neçû. Me lê temaşa kir. Yanî çûn Îmraliyê, hevdîtin çêbûn, ji wir çûn Qendîlê, ji wir hatin ba MÎT'ê, nizanim çi û çi... Me li vê pêvajoyê temaşa kir. Me wiha temaşa kir. Yanî wexta ku ew daxwaz derketin holê ku em dixwazin wan biparêzin, em li dora wan sekinîn û lev kom bûn. Lê belê me nekarî daxwazekê hilberînin.

Hin beşdar diyar dikin ku di mijara civakîkirin/giştîkirina aşitiyê de, SCS'yan, di Pêvajoya Çareseriyê de nekarîn di qada civakî de xebatan bikin yan jî xebat nekirin; nexasim xebatên berbelavkirina çanda aşitiyê. Di vê mijarê de diyar dikin ku qada sîvîl bi xwe li "çanda aşitiyê" gelek nas nebû, nekarî "zimanekî aşitiyê" çêbike û ev rewş karîger bû li ser lawaziya xebatên ji bo avakirina aşitiya civakî. Nûnerê SCS'yekê, ku di qada mafên mirovan de dixebite, gaveke pêşvetir diçe û diyar dike ku bi taybetî piraniya SCS'yên xwedî rêfêransên çeprew xwedî "dîskûrsên mîlîtarîst" in û mekanîzmayên wan ên biryargirtinê gelek navendî ne; lewma jî zêde ne mumkun bû ku ev sazî di nav xwe de bikarin biryarên sîvîl wergirin û rêbazên demokratîk cî bi cî bikin.

Hin beşdar nîqaşên civakîbûn/giştîbûna aşitiyê bi rêya “lokalkirina aşitiyê” dinirxînin. Li gorî vê yekê, pêwîst bû ku di Pêvajoya Çareseriyê de “aşitî bihata lokalkirin”. Di vê mijarê de li rexmî hemû sînorên xwe, Lijneya Mirovên Aqil dikarî fonksiyoneke girîng bibîne. SCS’yan dikarî di vê mijarê de roleke girîng bilîstana. Lê belê ne hukumeta AK Partî û Tevgera Kurdan a sereke armanceke wiha dan pêş xwe û ne jî SCS’yan di vê mijarê de înîsiyatîf wergirtin û karîn mudaxil bin. Beşdarek, ku li ser SCS’yan dixebite, diyar dike ku di Pêvajoya Çareseriyê de mijara civakîkirina aşitiyê bi temamî hate feramoşkirin: “Di vê meseleyê de tiştekî wiha heye. Yekem, divê diyalog hebe di navbera aliyên pevçûnan de. Duyem, divê têkiliyek hebe di navbera mijar û rehend(aspect)ên mijarê û civakê de. Bi ya min, ev beşa duyem di Pêvajoya Çareseriyê de tew nehate pîlankirin jî.” Beşdar diyar dike ku ev yek ne bi rêya bikeran, lê bi rêya mijarên wekî jin, jîngeh, astengdar û zarokan dikare pêk bê. Ji ber ku dema biker “xwe ji mijarên xwe pak bikin”, nikarin rêyekê vekin ji bo axaftina meseleya kurd; berevajî vê yekê dibine asteng li ber meseleya kurd ku pir-rehend e:

> Em 7-8 sal berî niha li ser zarokên kevir-avêj diaxivîn, ne wisa? Niha em wan ciwanan diaxivin ku şerên xendekan dikin. Me dît ku zarokên ku wê rojê kevir diavêtin, niha veguherîne wan ciwanan ku şerê xendekan dikin. Bi hezaran ji wan, jiyana xwe ji dest da di vê ewkê de (di pevçûnên nav-bajaran de). Baş e niha, gelo em ê li ser nifşê nû çi biaxivin? Eger peresendina vî karî wiha diçe, eger ciwanên kurd ji zarokên kevir-avêj vediguherin mîlîtanên ciwan ku şerê xendekan dikin, baş e gelo nifşa peyre dê veguhere çi? Lewma jî heta ku ev rehendên civakî yên meseleyê neyên gotûbêjkirin, yanî heta ku em li gel meseleyên zarokên kevir-avêj jî eleqedar nebin, heta ku em xebateke civaka sîvîl pêş nexin ji bo ku wê fam bikin, heta ku em wê têkiliyê di navbera yên vir û yên wir de daneynin, di nav mijaran de, yanî heta ku em dest bi nîqaşkirina mijarê nekin, ez dibêjim ku tenê dê nîqaşeke fasid be; ew jî tene ji axaftinekê pêk tê ku hewleke ragihandina dêklarasyoneke yek-alî ye bo aliyê din.

Hin beşdar diyar dikin ku SCS'yan nekarî pêvajoyê bişopînin û xwedî li "daxwaza aşitiyê" derkevin. Beşdarek, ku li Stenbolê li ser bingeha mafî dixebite, bi bîr dixe ku di Pêvajoya Çareseriyê de "daxwaza çavdêriyê" ku veguherî krîzê bi rêya "Lijneya Şopan-dinê", SCS'yan bêyî ku li hêviya aliyan bimînin dikarîn bi awayekî fîîlî bikin, lê belê di vê mijarê de xebateke wisa girîng nehate kirin. Beşdarek, ku li Enqereyê di qada zayenda civakî de xebatan dike, bi bîr dixe ku em hê tam ji ber vê kêmasiya "hakemiya civakî" nizanin ka pêvajo çima xirap bû, kê xirap kir, para kê çi qas bû. Beşdareke din, ku diyar dike ku aşitî sozeke siyasî bû ku PKK û hukumeta AK Partiyê pêşkêşî civakê kiribû, derdibire ku SCS xwedî li vê yekê derneketin:

> Aşitî sozeke siyasî ye ku hatiye dayîn bo vê civakê, bo civaka Tirkiyeyê, bo xelkên Tirkiyeyê. Pêwîst e em bidin pey vê sozê eynî wekî sozeke ku têkildarî mijarên darayî û xanenişîniyê yan jî têkildarî îstîxdamê ye. Em nadin pey. Çi rastrew çi çeprew çi muxalefet çi ewk [nabêje ku] "Birayo yek deqe. Wan li heft herêman bi dehan civîn çêkirin li gel rûspiyan li gel vî û wê. Te çû hevdîtin li gel Îmraliyê kir. Qendîlê te ev yek kir, aliyê din te ev yek kir". PKK û dewletê ev soz dan civaka Tirkiyeyê piştî ku bi awayekî fermî hatin eşkerekirin. Lewma jî divê ez xwediyê vê daxwazê bim gava ku ez li hêviya aşitiyê bim. Divê ez xwediyê wê daxwazê bim ku dane min.

Qadeke din ku SCS tê de lawaz man, pêşvebirina wan şirîkatiyan bû ku gettobûnên siyasî derbas dikin û diyalogê mumkun dikin di navbera komên civakî yên ciyawaz de. Gelek beşdar diyar dikin ku di Pêvajoya Çareseriyê de SCS'yan tercîh kirine ku "di taxên xwe de bimînin" û hewl nedane ji bo ku hevkariyê bikin li gel beşên ciyawaz. Di vê mijarê de; gettobûn, tengiya qadên gewr, angajmanên siyasî di qada civakî de ku di beşa berî niha de binê wan hatibû xêzkirin, di Pêvajoya Çareseriyê de jî bi asteke bilind berdewam kir. Nûnerê SCS'yekê, ku li Enqereyê xebatan dike, diyar dike ku "rûbirûbûna komên civakî yên ciyawaz" nekarî bê çêkirin û di vê mijarê de tirsên heyî karîger bûn. Her wiha, nûnerê SCS'yekê, ku li Stenbolê li ser bingeha zanyariyan xebatan dike, binê wê yekê xêz dike ku çend awarte ne tê de,

camîeya çep-sêkûlêr û camîeya îslamî-parêzgarîkar nekarîn şirîkatiyekê ava bikin. Di Pêvajoya Çareseriyê de camîeya çep-sêkûler di nav xwe de hin şirîkatî çêkirin û li pêvajoyê beşdar bûn; lê belê camîeya îslamî-parêzgarîkar bi rêjeyeke mezin li derveyî pêvajoyê ma û kar avête ser hukumetê. Nûnerê SCS'yekê, ku civakî lev dicivîne ku pev diçin û di qada têkiliyên civakî yên hestyar bo pevçûnan de xebatan dike, piştgiriya vê argomêntê dike û diyar dike ku beşa rastrew-parêzgarîkar xwe dûr girt ji pêvajoyê û li hêviyê sekinî û digot ku "ev îş xilas nebû ku mafdariya me derkeve meydanê".

Ji aliyê din; nûnerê SCS'yekê, ku ji Stenbolê ye û bi nasnameya xwe ya îslamî û parêzgarîkar tê nasîn, diyar dike ku camîeya îslamî cara yekem bi asteke girîng bi Pêvajoya Çareseriyê li meseleya kurd mudaxil bû. Beşdar, xebatên camîeya îslamî-parêzgarîkar bi van gotinan derdibire:

> Camîeya îslamî jî cara yekem germagerm kete nav vê meseleyê. Binêrin li Rojhilatê Başûr herî kêm 30-40 civîn çêbûn; yanî li Riha û Amedê. Li vir, hemû îslamxwaz çûn herêmê. Cara yekem ji medreseyên îslamî û têolojîstên herêmê bigirin heta rêxistinên civaka sîvîl li ser heman maseyê rûniştin. Yanî li ser maseyekê rûniştin. Ev tiştekî gelek girîng bû. Yanî 80 sal bû ku tu kesî atmosfereke wiha nedîtibû. Bayekî xweş hat. Her kesî ji vî bayî bawer kir.

Hatiye çavdêrîkirin ku bi qasî getobûna siyasî, derza herêmî jî nehatiye derbaskirin di Pêvajoya Çareseriyê de. Her wekî ku hin beşdaran binê wê xêzkirin, di navbera rojhilat û rojavayê Feratê de diyalogek pêk nehat û mecrayên ji bo vê yekê pêwîst nehatin vekirin. SCS'yan dikarî di vê qadê de rolekê bilîzin. Lê belê di vê qadê de xebatên girîng nehatin çêkirin. Nûnera SCS'yekê, ku li Enqereyê di qada zayenda civakî de xebatan dike, diyar dike ku Tevgera Jinên Kurd ku gelek SCS'yan li xwe digire, rastereast wek aliyekî li pêvajoyê beşdar bû; lê belê ev rewş ji bo wan rêxistinên jinan derbasdar nebû ku li Enqereyê xebatan dikin. Ji ber vê reşwê, li gorî beşdar, derza herêmî di qada civaka sîvîl de ji nû ve tê hilberandin û ji bo wan SCS'yên bi hejmareke sînordar li Enqereyê ne û xwedî li aşitiya civakî derdikevin zehmet e ku li

ser meseleya kurd, çareserkirina pevçûnan û aşitiyê biaxivin. Li ser vê mijarê, beşdarekî din ji Enqereyê bi bîr dixe ku nexasim li aliyê rojava xebatên hilberandina rizamendiya civakî ji bo aşitiyê bi têra xwe nehatin kirin. Li gorî beşdar, li rojava, bi hejmareke sînordar SCS hene ku dixwazin tevkariyê li çareseriya siyasî ya meseleya kurd û aşitiya civakî bikin. Ev SCS, zêdetir ji birêvebirina xebatên hevgirtinê li gel saziyên qada kurd, divê fokisa xwe bidin ser wan xebatan ku çanda aşitiyê berbelav dikin û rizamendiyê hildiberînin ji bo aşitiya civakî.

Hin beşdar derdibirin ku meseleyên wekî gettobûna siyasî ya berbelav di qada civaka sîvîl de û derzên herêmî, bi taybetî bi xebatên heqîqet û rûbirûbûnê dikarin bêne derbaskirin; lê belê SCS'yan di vê mijarê de bi têra xwe tevkarî pêşkêş nekirin. Li rexmî ku di tecrubeyên cîhanê de ev mijar cihekî gelek girîng digire û her wiha li rexmî ku li Tirkiyeyê salên dirêj e li ser vê mijarê tê axaftin û li rexmî ku di Pêvajoya Çareseriyê de gelek hate bilêvkirin, lê belê xebatên di vê mijarê de gelek sînordar man.

### 4. Dînamîkên ku Beşdarbûna SCS'yan li Pêvajoyê Sînordar Kirin

Nûnerên SCS'yan li ser mijara tevkariya sînordar a SCS'yan li Pêvajoya Çareseriyê, li aliyekî îşaret bi wan meseleyan dikin ku çavkaniya wan alî ne, ji aliyekî din binê wan meseleyan xêz dikin ku çavkaniya wan civaka sîvîl bi xwe ye.

Gelek beşdar diyar dikin ku Pêvajoya Çareseriyê girtî bû bo beşdarbûna civaka sîvîl. Diyar dikin ku hêvdîtinên ku bi asteke sînordar li gel SCS'yan hatin kirin, zêdetir "usûlen" hatin kirin û aliyan SCS kirin amraz bi mebesta çêkirina rewakirinê bo karê xwe. Li gorî vê yekê, her du aliyan jî pêvajo "bi rêxistinbûneke otorîtêr a aşitiyê" bi rê ve birin û nexwestin ku civaka sîvîl li pêvajoyê beşdar bikin wek aktereke lîstik-çêker. Hukumeta AK Partiyê û Tevgera Kurdan a sereke, civaka sîvîl yan ji pêvajoyê veder kir yan jî li gorî îstîqameta daxwazên xwe daxwaz kir ku civaka sîvîl mudaxil be.

Di vê mijarê de nimûneya ku herî zêde tê bibîrxistin, Lijneya Mirovên Aqil e. Gelek beşdar binê wê yekê xêz dikin ku vê lijneyê esasen fonksiyoneke civaka sîvîl dît û di nav wê de ji SCS'yan gelek kesayetan cih girt; di gel vê yekê di pêkhatina vê lijneyê de SCS mudaxil nebûn. Bi gotina nûnerê SCS'yeke ji Amedê, Lijneya Mirovên Aqil, "ne li gorî hêz, daxwaz yan jî keda saziyên civaka sîvîl ku dane vê pêvajoyê, lê belê beşeke mezin ji aliyê hukumetê ve û beşeke wê jî bi pirsîn ji PKK, em dikarin bêjin Ocelan, hat amadekirin". Nûnerê SCS'yekê, ku li Enqereyê li ser bingeha mafî dixebite, diyar dike ku divê Lijneya Mirovên Aqil wek pêkhateyeke serbixwe ji wan SCS'yan bihata avakirin ku di qadên ciyawaz ên wekî zarok, mafên bajariyan, astengdar û mafên mirovan de xwedî tecrube ne; lê belê hukumetê, "mutabiq li gel çanda siyasî", tercîh kir ku bi rêya "tayînkirinê" lijneyê pêk bîne.

Beşdareke din, ku di qada zayenda civakî de dixebite, diyar dike ku hukumeta AK Partiyê ne tenê endamên Lijneya Mirovên Aqil tayîn kirin, her wiha rola civaka sîvîl jî dewrî vê lijneyê kir û SCS hiştin li derve. Nûnerê SCS'yeke ji Enqereyê wê qeyranê bi bîr dixe ku di destpêka Pêvajoya Çareseriyê de bilind bûbû ji ber ku nîşeyên hevdîtineke li gel Ocelan li çapemeniyê hatibûn eşkerekirin û diyar dike ku AK Partî û HDP SCS li aliyekî hetta li gel tabana xwe jî ev mesele bi têra xwe neaxiviye. Ji ber ku levkirina bingehîn, neaxaftin bû li ser meseleyê:

> Yanî bo nimûne, gava ku aşitî hat dê çi biqewime, eger li hemû dibistanên navincî li ser vê yekê pêşbirkek bihata çêkirin, mirovan zêdetir li ser vê dikarîn xeber bidana. Heta ku ev yek tenê li pişt deriyên girtî û di navbera lineyên diyar de û li ser wan zabitnameyan pêş ve biçe ku bi zimanê çûkan hatine nivîsîn, ne mumkun e ku civaka sîvîl yan jî kesek ji kesan vê yekê wek daxwazeke civakî daxwaz bike. Wisa ku hetta partiyên siyasî yên aliyan li gel tabanên xwe jî ev mesele qet xeber nedan. Ji ber ku tiştê ku li ser li hev kiribûn, neaxaftina meseleyê bû.

Duyem, pêwîst e ew yek bê yadaştkirin ku di mijara beşdarbûna Pêvajoya Çareseriyê de li ba gelek SCS'yan bendewariyek hebû ku ji aliyê dewlet û Tevgera Kurdan a sereke ve bo wan "qadek

bê vekirin”. Zêdetir ji wê yekê ku wek alî, muxatab û bikera meseleyê li pêvajoyê mudaxil bin, hatiye çavdêrîkirin ku di nav wê qada lîstikê de ku aliyên rasterast ên pevçûnan destnîşan kirine û di çarçoveya wan rolan de ku bo wan hatine dayîn, SCS li pêvajoyê mudaxil bûne; meyleke wiha di nav SCS’yan de zal bû ji bo mudaxilbûnê. Bi gotineke nûnerê SCS’yekê, ku li Stenbolê li ser bingeha mafî parêzvaniyê dike, “akterên civaka sîvîl ên li Tirkiyeyê zêde xwe wek aktereke pêvajoyeke bi cih nakin”. Lê belê SCS parçeyeke binyadîn pêk tînin di gelek pêvajoyên aşitiyê de li cîhanê.

Di lêkolîna qadê de hatiye çavdêrîkirin ku SCS’yan çareserkirina pevçûnan û meseleya avakirina aşitiya civakî bi rêjeyeke mezin wek pêvajoya gotûbêjeke di asta pêşengiya bilind de lê mêze kirine û wek pêvajoyên ku pêwîst e di asta civakî yan jî di asta navincî de bêne birêvebirin wisa fam nekirine têra xwe. Ji vî aliyî ve gelek SCS rolên xwe bi navbînkarî, hakemî yan jî bi xebatên wekî şopandin û bi fonksiyonên parêzvaniyê sînordar dikin. Hatiye çavdêrîkirin ku saziyên navborî li ser parastina hemwelatiyan, xizmeta rasterast bo mexdûrên pevçûnan, civakîbûna nav-komî, berbelavkirina çanda aşitiyê û hêzdarkirina pêkvejiyana civakî ya hestyar bo pevçûnan ku dikarin wek xebatên “civakîkirina aşitiyê” bêne xulasekirin, têra xwe xebat nekirine.

Li gel rastiyên ku hukumeta AK Partiyê û Tevgera Kurdan a sereke ji bo akterên civaka sîvîl qadeke gelek sînordar vekirin û SCS jî li şûna ku înîsiyatîfê wergirin di nav bendewariyê de man, wek sêyem, tê diyarkirin ku Pêvajoya Çareseriyê di wê astê de vekirî nebû ku rê bide kontrolkariya giştî; vê yekê jî beşdarbûna SCS’yan sînordar kir. Gelek beşdar qebûl dikin ku divê pêvajo di asteke diyar de girtî be ji bo ku ji aliyê wan akteran ve neyê têkdan ku li dijî wê ne. Lê belê cextê li ser wê yekê dikin ku divê kontrolkariya giştî bihata pêkanîn. Gelek beşdar derdibirin ku li rexmî ku du sal bi ser Pêvajoya Çareseriyê de derbas bûne, hê nizanin ka “mase çima wergeriya”. Bi kurtasî; li gorî gelek beşdaran, girtîbûn bo kontrolkariya giştî, astengek ji astengên girîng bû li ber mudaxilbûna SCS’yan li pêvajoyê

Wek dawî di vê mijarê de, hin beşdar diyar dikin ku dewlet û Tevgera Kurdan a sereke, SCS ne tenê veder kirin, di heman demê de ew neçar kirin ji bo ku bibine alî. Li gorî vê yekê, her du aliyan jî zor li akterên civaka sîvîl kirin ji bo ku li ba wan rawestin û piştgiriya argomêntên wan ên siyasî bikin. Ev yek ji aliyekî ve dibû asteng ji bo ku alî ji civakê rexne, fikr û pêşniyaran bigirin der heqê pêvajoyê de; ji aliyê din ve nexasim bû sedema bêbandorbûna wan SCS'yan ku tercîh dikirin ku di "qada gewr" de bimînin.

Tevî wan kêşeyên ku li jor hatin xulasekirin, ku çavkaniya wan aliyên rasterast ên pevçûnan in, her wiha binê gelek kêşeyan tê xêzkirin ku çavkaniya wan civaka sîvîl bi xwe ye. Meseleya ku di vê mijarê de herî zêde tê cextkirin, meseleyên alîgirî û angajmanên siyasî ne ku bi ser qada civaka sîvîl de hakim in. Li gorî gelek beşdaran, ev alîgirî û angajmanên siyasî di Pêvajoya Çareseriyê de bûn asteng li ber SCS'yan ji bo ku bikarin pozîsyoneke rexnekarane bigirin û di gelek rewşan de berê wan da wê yekê ku dîskûrsên wê siyasetê rewa bikin ku alîgirê wê ne û li ser wê xetê xebatan bikin. Beşdarek, ku li ser SCS'yan dixebite, diyar dike ku di Pêvajoya Çareseriyê de kêşeyên angajmanên siyasî û alîgirî gelek diyarker bûn di vederkirina akterên siyasî de yan jî di venebûna qadeke têr de ji bo civaka sîvîl. Wek encamek ji encamên angajmanên siyasî û alîgiriya SCS'yan, akterên siyasî li saziyên bi vî rengî, her wekî di gelek rewşan de, di Pêvajoya Çareseriyê de jî, wek wan akteran mêze kir ku piştgiriya wan dikin û tevkariyê li siyaseta wan dikin. Bo nimûne di vê mijarê de, nûnerê SCS'yeke ji Wanê diyar dike ku Platforma Edalatê ji bo Biratiyê, esasen ji ber vê alîgirî û angajmanên siyasî fonksiyona xwe ji dest da û belav bû. Nûnerê SCS'yeke ji Wanê, ku hewl dide ku di "qada gewr" de bimîne, diyar dike ku ev meseleya alîgiriyê di xebatên Lijneya Mirovên Aqil de jî derket û ji ber vê meseleyê jî esasen zemîna diyalogeke rasteqîn pêk nehat:

> Bo nimûne, di civînên parêzgehan ên zilamên aqil de ev yek gelek eşkere derkete holê. Yanî alîgirê hukumetê yan jî civaka sîvîl ku parêzerê aydolojiya hukumetê ye, bi riwangeha hukumetê mesele nirxandin. Kesên ku muxalif bûn jî di wê çarçoveyê de li meseleyê nêrîn û rexneyên xwe anîn rojevê. Te zanî, di wan civînan de [...] yanî ke

> sekî bi paşve-avêtina gevekê yan jî bi levnêzîkbûn û rojevkirina dîskûrsên hevpar, tevkarî li pêvajoyê nekirin esasen. Yanî her kes di wê demê de bi garda xwe, bi bereya xwe, bi riwangeha xwe ya aydolojîk li meseleyan nêrîn.

Beşdarek, ku di qada civaka sîvîl de dixebite, gaveke din wêdetir diçe û diyar dike ku SCS bi angajmanên xwe yên siyasî û tevî van angajmanan li pişt akterên ku alîgirê wan in, li pêvajoyê beşdar bûn û diyalog û gotûbêj nemumkun kirin:

> Esasen beşdaran di nav berşdarbûneke bialîgir de cih girtin. Dewletê jî wisa mêze kir, bi ya min, siyaseta kurd jî wisa mêze kir. Yanî bila kesên ji min beşdar bin. [...] Niha, bi ya min, ev rêbazeke baş nîne ji bo gotûbêjan. Ya rasttir, gava ku alî bi piştgiriya xwe ya civaka sîvîl li çareserkirina meseleyekê beşdar bû, ku aliyên wê yên civakî yan jî ewlehiyê hene, esasen ew gotûbêjeke baş, gotûbêjeke bikalîte hilnaberîne. Hingî hûn SCS'yan li pişt angajmana siyasî li hev kom dikin. Yanî gava ku her kesî SCS'ya xwe di nav angajmana xwe de anî ser maseyê, di wir de ew jixwe tenê dikare bibe maseya daxuyaniyên yek-hêlî. Ew nikare bibe maseyeke axaftinê.

Wek encamek ji encamên angajmanên siyasî û alîgiriyê, bi gotineke beşdarekî ji Amedê, SCS "li şûna ku projêksiyonên afirîner pêş xin, li ber bayê siyasetê ketin". SCS'yên ku rexnegiriya xwe ji dest dan, Pêvajoya Çareseriyê di qada giştî de erê kirin, lê belê ev rewş bû asteng li ber wê yekê ku SCS nekarin aliyên lawaz ên pêvajoyê bibînin û tevkariyê lê bikin. Jê zêdetir, vê rewşê ji aliyekî ve SCS pasîfîze kirin û ji aliyê din ve jî bi rêjeyeke mezin zerer gihande bawermendiya van saziyan ku li ba civakê heye.

Beşdarek, ku li ser SCS'yan dixebite, diyar dike ku di pêvajoyên gotûbêjan de akterên rêveker û asankarîker esasen dikarin ew akter bin ku berê neketine nav angajmanên siyasî û di qada gewr de mane, lê belê di Pêvajoya Çareseriyê de ev yek jî pêk nehat:

> Pêwîst bû ku ew SCS li mijarê beşdar bûna, ku dikarin ji me re behsa wan mexdûriyetan bikin ku li Tirkiyeyê hatine serê beşên civakî yên ciyawaz û dikarin me qanî bikin

> ku ev mexdûriyet qewimîne û berê neketine nav angajmanên siyasî. Ew beşdar nebûn. Yanî saziyên jîngehan nînbûn, eve saziyên astengdaran nînbûn, eve saziyên ku ji bo mafên bajaran hewlan didin nînbûn. Yan jî saziyên ku ji bo wekheviya zayenda civakî hewlan didin nînbûn, saziyên ku têdikoşin nînbûn. Ev hemû sazî, di nav meseleya kurd de neketine nav tu cure angajmaneke siyasî, lê belê ev sazî esasen xwedî wê zerfiyet û potansiyelê ne ku bikarin li wan encaman serwext bin ku ji ber kêşeyan çêbûne. Ji ber ku ev li gotûbêjan beşdar nebûn, esasen me nekarî em behsa wan mexdûriyetan bo civakê jî bikin ku ji ber meseleya kurd çêbûne.

Lewma jî civakê fam nekir ka em dixwazin çi çareser bikin. Yanî wisa fikir ku tiştê ku em dixwazin çareser bikin, tenê şerê heyî ye. Yanî bêdengbûna çekan. Lê belê em dixebitîn ji bo ku tiştekî çareser bikin ku wêdetir e ji bêdengbûna çekan. [...] Lewma jî vê beşdarbûna kêm ya civaka sîvîl yan jî beşdarbûna mucehhez bi angajmanên siyasî, tevkariyek neanî ji bo Pêvajoya Çareseriyê.

Alîgiriya SCS'yan hişt ku SCS bi têra xwe karîger nebin di Pêvajoya Çareseriyê de, ev li aliyekî, her wiha rola wê yekê jî girîng bû ku xwedî tabaneke civakî ya hêzdar nebûn. Nûnerê SCS'yekê, ku li Amedê di qada civakî de xebatan dike vê rewşê bi van gotinan xulase dike:

> Lê belê di vir de, dîsan tiştek hebû ku kêm dima. Li aliyan nediket. Divê em li civaka sîvîl hinekî jî wiha binêrin; ji ber ku tabana wan lawaz e, çarneçar ev xebat hinekî din dikarin êlîtîst bimînin. Û civaka sîvîl ku tabana wan heye, çarneçar, hem di navbînkariyê de hem jî di şopandin û nirxandina van mijaran de bandora wan bêtir bilind e. Her wekî ku min got ji ber du sedeman. Hem ji ber ku nekarîn bêalîgiriya xwe biparêzin hem jî bi taybetî tabana wan nebû.

Alîgirî û lawazbûna tabana civakî û êlîtîzm jî tê de, wek sêyem, hin akter diyar dikin ku SCS di pêvajoya Çareseriyê de di mijarên çareseriya siyasî ya meseleya kurdî û avakirina aşitiya civakî de

bê amadehî bûn. Nûnerê SCS'yekê, ku li Stenbolê li ser bingeha zanyariyan dixebite, derdibire ku SCS bê amadehî ketin nav pêvajoyê û ji ber vê yekê jî nekarî tevkariyeke “avaker” û “çêker” pêşkêş bike. Nûnerê SCS'yeke ji Wanê, ku bi nasnameya xwe ya îslamî-parêzgarîkar tê nasîn, diyar dike ku akterên civaka sîvîl têra xwe bela wela bûn, nedikarîn xebatên sîstematîk bikin, nedikarîn çareseriyan bo kêşeyan pêş xin, bêtecrubetiya wan li ser qada siyasî û qada civaka sîvîl tund û berbelav bû û van hemû mijaran çalakiyên SCS'yan kêm kirin. Nûnerê SCS'yekê, ku li Amedê rasterast xizmetê bo mexdûrên pevçûnan dabîn dike, derdibire ku hukumeta AK Partiyê û Tevgera Kurdan a sereke di mijarên çareserkirina pevçûnan û avakirina aşitiya civakî de bê amadehî bûn û vê yekê jî derfeteke mezin afirand ji bo ku SCS li pêvajoyê mudaxil bin. Lê belê SCS'yan li şûna ku di qadên xwe de çareseriyên pratîîk hilberînin, di vê mijarê de amadehiyê bikin û zemîn xweş bikin, qîma xwe bi alîbûna pêvajoyê û bi piştgiriya aşitiyê di asta dîskûrsî de anîn:

> Bo nimûne baro. Baro esasen saziyeke girîng e di civaka me de. Li hemû cîhanê baro yek ji girîngtirîn saziyan e li her welatî. Baro li şûna ku nîqaşa parêzvaniya siyasî ya vî karî yan jî mafdarî û nemafdariya wê, rastî û şaşiya wê bikin, bi ya min divê zemîna huqûqî amade bikin. Ev ê çawa be? Rewşa hezaran ciwanên me dê çi lê bê? Rengvedana wê di çarçoveya wan maf û makeqanûnê de dê çawa be? [...] Gava ku ev hatin projesazkirin sûda wan dibe. Eger na, “ez alîgirê pêvajoya çareseriyê me”, “bijî aşitî” nizanim “wî têk da” nizanim “wî filan û filan tişt kir”; ev li şûna ku tevkariyê li aşitiyê yaxud jî li Pêvajoya Çareseriyê bikin... Bi kurtasî em ji vî îşî re bêjin pasîfîzm û derbas bin.

Çarem, binê wê yekê tê xêzkirin ku bi taybetî SCS'yên mezin ku di aliyê rojava de ne û bandora wan hem li ser hukumetê hem jî li ser raya giştî heye, piştgirî nedan pêvajoyê. Nûnerê SCS'yekê, ku li Amedê di qada aboriyê de dixebite, diyar dike ku ji ber ku pêkhateyên wekî Baro, Ode û rêxistinên Kardêran xwe dûr girtin ji pêvajoyê, ev yek karîger bû ku Pêvajoya Çareseriyê bi sernekeftî bi dawî bibe. Hin beşdar derdibirin ku SCS'yên qada

kurd ji bo ku ev akterên civaka sîvîl, ku li seranserê welêt bandora wan heye, piştgiriyê bidin pêvajoyê hewldanên curbecur kirin, lê belê van hewlan encamek dernexist.

Pêncem, tê diyarkirin ku helwesta xwe-dûrgirtin û rexnegirane ya partiya muxalefeta sereke Partiya Gel a Komarê (CHP), bandor li wê qada civaka sîvîl kir ku di bin bandora wê de ye. Nexasim di nav camîeya çep-sêkûlêr de gotinên wekî “HDP li gel AKP lev hat”, “serokatiyê bide û xweseriya demokratîk bigre” bi awayekî berbelav diçûn û dihatin û vê yekê bi taybetî CHP û qada civaka sîvîl ku di bin bandora CHP’ê de ye dehf da ji bo ku xwe dûr bigirin ji pêvajoyê.

Li gorî nûnerê/a SCS’yekê, ku li Stenbolê li ser bingeha mafî parêzvaniyê dike, “em di nav atmosfereke polîtîk re derbas bûn ku nêrîna xêrxwazane li pêvajoya çareseriyê hatibû wek hevkirin li gel nêrîna xêrxwazane li AK Partiyê” û vê rewşê tevkarî li çareseriya meseleya kurdî û avakirina aşitiya civakî nekir. Her wekî ku hin beşdaran binê wê xêz kirin, bi dirêjahiya Pêvajoya Çareseriyê nîqaş û rexneyên wekî “aşitî li gel hukumeteke rastrew çêdibe?”, “aşitî li gel hukumeteke antî-demokratîk çêdibe?”, “ewil demokrasî paşê aşitî”, ku camîeya çep-sêkûlêr tim di rojevê de dihiştin, esasen nîşan didin ku ji bo vê camîeyê eweliyeta têkilî, rikaberî û pevçûna ku li gel AK Partiyê çêkirine zêdetir e ji çareseriya siyasî ya meseleya kurdî û avakirina aşitiya civakî. Ji vî aliyî ve camîeya dij bi AK Partiyê, her bi guman nêzîkî pêvajoyê bû, xwe dûr girt ji tevkarîkirinê, piştgirî neda û hetta serkeftina pêvajoyê nexwest.

Nûnerê SCS’yeke din, ku li Stenbolê li ser bingeha zanyariyan xebatan dike, di vê mijarê de hinekî pê de diçe û diyar dike ku ji bo camîeya SCS’yên çep-sêkûlêr ên rojava, meseleya kurdî “meseleyeke pileya duyem e”. Li gorî vê yekê, di Pêvajoya Çareseriyê de di navbera eweliyeta akterên aliyê kurd û camîeya çep-sêkûlêr a aliyê rojava de cudahiyeke tûj hebû. Beşdarek, ku bi xebatên xwe yên li ser SCS’yan tê nasîn, di vê mijarê de îşaret bi çalakiyên Geziyê dike û diyar dike ku ji bo gelek akterên pêvajoya Geziyê, Pêvajoya Çareseriyê rojeva yekem nebû û nîqaşên ku li ser “çalakiyên Geziyê û kurdan” çêbûn esasen îşaret bi vê cudahiyê dikir.

Lê belê Pêvajoya Çareseriyê di 21'ê Adara 2013'an de, tenê du meh berî çalakiyên Geziyê bo raya giştî hatibû ragihandin û pêwîst bû ku xwedî li pêvajoyeke wiha derketa ku ji bo peydakirina çareseriyekê bo meseleyeke wiha sojnak hatibû destpêkirin.

Hin nûnerên SCS'yan diyar dikin ku fikara zerernedan li Pêvajoya Çareseriyê hişt ku gelek akterên civaka sîvîl pasîf bisekinin û înîsiyatîfê wernegirin. Li gorî vê yekê, mijarên wekî girtîbûna pêvajoyê bo kontrolkariya giştî, tercîha Tevgera Kurdan a sereke û AK Partiyê ji bo lidervehiştina akterên sîvîl, hêza akterên dijî pêvajoyê, hestyariya parastina pêvajoyê li dijî van hêzan hişt ku SCS "zêde ji hed bitemkîn" bin û ji bo ku zererê negihînin pêvajoyê înîsiyatîfê wernegirin.

**Encam û Nirxandin**

Wek encam, nîqaşên li ser rola SCS'yan di Pêvajoya Çareseriyê ya 2013-2015'an rê dide ku nexasim binê şeş encamên sereke bên xêzkirin. Yekem, her çend ku ezmûnên ku di dem û cihên cuda de derketin nîşan didin ku SCS fonksiyonên ciyawaz di warê çareseriya pevçûnan û avakirina aşitiya civakî de bi cî tînin, lê derdikeve ku di pevçûna kurd li Tirkiyeyê de SCS'yan bi awayekî nîsbî fonksiyonên xwe yên wekî pêşkêşkirina xizmetguzariyê, çavdêrîkirin û parêzvaniya giştî bi cî anîne; ji aliyê din ve derdikeve ku wan nekariye bi awayekî karîger fonksiyonên xwe yên din ên wek parastina hemwelatiyan, navbînkarî û asankarî, pêkvebûna civakî ya hestyar bo pevçûnan, civakîbûna nav-komî û berbelavkirina çanda aşitiyê bi cî bînin. Lewma dikare bê gotin ku berê SCS'yan zêdetir li akterên wekî dewlet, hukumet û siyaseta kurd a sereke bûye û fokusa xwe têra xwe nedane xebatên civakî.

Duyem, derdikeve ku xebatên avakirina aşitiyê li Tirkiyeyê têra xwe xwecihî nebûne. Nîqaşên ku li ser têgehên ciyawaz ên wekî "xwecihîbûna aşitiyê", "giştîkirina aşitiyê", "civakîkirina aşitiyê" hatin kirin, esasen, nîşan didin ku xebatên çareseriya pevçûnan û avakirina aşitiyê li Tirkiyeyê zêdetir bi nêrîneke wisa hatine birêvebirin ku xîtab li qada seranserê welêt kirine. Pêwîst e bê notkirin ku SCS rasterast li lokal, tax, navçe û parêzgehan têra xwe nexebitîne.

Sêyem, derdikeve ku beşeke mezin a SCS'yan li Tirkiyeyê, li mijarên wekî Meseleya Kurd rasterast mudaxil nebûne û SCS'yên ku li ser vê mijarê di nav hewldanê de ne ji %2-3 derbas nakin. Piraniya komeleyên çalak di qada civaka sîvîl de, ji wan binyadan pêk tên ku ji bo werziş, hevkarîbûna hembajariyan û avakirina mizgeftan hatine damezirandin. Beşdarkirina van binyadan li xebatên avakirina aşitiya civakî ku rasterast bi binyadên siyasî ve girêdayî nînin, yek ji girîngtirîn ezmûnên Tirkiyeyê ye di mijara çareseriya pevçûna kurd de.

Çarem, derdikeve ku gettobûneke girîng heye di pevçûna kurd a Tirkiyeyê de. Dikare behsa sê gettoyên serekî û sînoran bên kirin ku van gettoyan çêkiriye: gettoyên siyasî, gettoyên cografîk û gettoyên sektorî. Derdikeve ku bi rêjeyeke mezin SCS di bin siya siyasetê de mane û tercîh kirine ku li "taxên xwe yên siyasî", bi gotineke din li gettoyên xwe bimînin. Temasgirtin, diyalogçêkirin û hevkarîkirin li gel taxên ciyawaz di babeta pevçûna kurd a Tirkiyeyê de têra xwe di asteke sînordar de ye. SCS'yên ku di nav gettoyên siyasî de tevdigerin, her wiha, derdikeve ku ji aliyê cografiyayê ve jî ji hev cuda ne. Hevbeşiyên SCS'yên li qada kurd û SCS'yên li aliyê rojava yê Tirkiyeyê jî têra xwe sînordar in. Wek dawî, derdikeve ku SCS di nav sînorên sektorî de mane, kapasîteya wan ji bo encamdana karên hevbeş ên pir-sektorî/pir-qadî têra xwe kêm e. Sazûmanên ku li ser mijarên wekî mafên mirovan, zayenda civakî û koçê dixebitin li gel wan sazûmanan hevkariyê dikin ku li ser mijarên wekî van dixebitin. Lê belê lihevkombûna SCS'yên ku li ser meseleyên ciyawaz dixebitin ku zêdetir ji qadekê li xwe digirin têra xwe kêm e. Ev rewş hem peywendîdarkirina xebatên SCS'yan dijwar dike hem jî dibe asteng li ber zêdekirina çalakiyên wan bi parastina sazûmaniya xwe di nav toreke firehtir de.

Wek dawî, pêwîst e bê notkirin ku li Tirkiyeyê meseleya kurd di asta sernavên makro de tê nîqaşkirin û peywendiya van sernavên makro li gel qadên mîkro nayê çêkirin. Xebatên ku di asta xwecihî de dê eleqeyê di navbera hevkarên xwecihî û aliyên ciyawaz ên meseleya kurd de çêkin û bi vî awayî dê meseleya kurd di asta mîkro de ji nû ve çarçove bikin, dikarîn karîgeriya SCS'yan zêde bikira di xebatên avakirina aşitiya civakî de.

Bo nimûne, behskirina meseleya zimanê dayikê li gel meseleya zarokên bi-otîzm, behskirina xwecihîbûn û parvekirina hêz/desthilatiyê li gel birêvebirina jîngeh û avê, dikarî asankariyê bike ji bo derbaskirina gettoyên siyasî û cografîk. Di gel vê yekê, gava ku li babeta pevçûna kurd ya li Tirkiyeyê bê nêrîn, dikare bê gotin ku SCS'yan bi piranî tercîh kirine ku li dor meseleyên makro mobîlîze bibin.

# Nimûneyên Çareseriya Pevçûnan û Tecrubeya Aşitiyê ya Tirkiyeyê

Gülçin Avşar

Tirkiyeyê di meha Tîrmeha 2015'an de xatirê xwe ji pêvajoya bêpevçûn a dawî xwest ku di Kanûna 2012'an de bi hevdîtina Serokê Encumena Hewalgiriya Neteweyî [ya Tirkiyeyê] (MÎT) Hakan Fidan di gel Ebdullah Ocelan ku li girava Îmraliyê ye dest pê kiribû.

Îro, tiştên ku di nav pêvajoya çareseriyê de hatin tecrubekirin her çend bi me wek çîrokeke avsûnî û nedîtî werin jî, ne hewla yekem bû ji bo çareseriyê. Dîrokeke gotûbêj û agirbestan a pêvajoya pevçûna PKK-Tirkiyeyê heye ku têra xwe heq dike ku li ser bê axaftin.

## Dîroka Gotûbêjan

Temasên yekem ku tên zanîn di navbera PKK û dewletê de çêbûne, di dewra Turgut Özal de çêbûne. Heft meh berî mirina Kevne-fermandarê Giştî yê Cendirmeyan Orgenaral Eşref Bitlis, ku di sala 1993'yan de ji ber ketina firokeya wî bi awayekî gumanawî mir, di nameyekê de ku tê de ronkirinên bidetay ji bo çareseriya meseleya kurd hebûn ji bo Özal nivîsîbû. Ev name di sala 2010'an de gava ku li ser mirina wî lêpirsîn dihate kirin, di wê lêpirsînê de hate tesbîtkirin. Nameya ku Bitlis ji bo Özal nivîsîbû ji pêşniyarên ku du qonaxan li xwe digirin pêk dihat. Qonaxa yekem ew tedbîr bûn ku li dijî hin ûnsûrên di nav dewletê de bûn û tedbîrên li dijî PKK'ê bûn ku îddîa dikir di gel hin fermandarên DYA'yî têkildar e. Heçî qonaxa duyem e, hatibû cextkirin ku divê hin gavên miyanrew ber bi gelê kurd bêne avêtin û polîtîkaya dewletê bê guhertin ji bo "rakirina tengavbûna gel di navbera PKK û dewletê de".[16] Adnan Kahveci jî her wekî Eşref Bitlis bi

**16** "Eşref Bitlis'ten Özal'a Son Mektup" http://www.ntvmsnbc.com id/25137395

awayekî gumanawî bi qezayekê jiyana xwe ji dest da. Wî li ser daxwaza Özal raporek amade kiriye û derbiriye ku divê dest ji tedbîrên leşkerî bê berdan û gavên siyasî yên ciddî bêne avêtin. Encumena Ewlehiya Neteweyî [ya Tirkiyeyê] (MGK) ku di 27'ê Tebaxa 1992'yan de civiyabû, MGK'yek bû ku bi nîqaşên li ser mafên kurdan şekil girtibû ku tê de hem şopên pêşniyarên Kahveci hem jî yên Bitlis hebûn. Rapora dawî ya dewra Özal di Çileya sala 1993'yan de ji aliyê Sekreterê Giştî yê Serokkomariyê Orgeneralê malnişîn Kemal Yamakî ve hatibû amadekirin û cext kiribû ku çareserî dûr e ji qada leşkerî.

PKK ku bersiv da hewlên erênî yên Turgut Özal, di dîroka xwe de agirbesta yekem di 20'ê Adara 1993'yan de bi awayekî yek-alî ragihand. Lê belê her çend agirbest du meh hate dirêjkirin jî, piştî bûyera 33 leşkeran ku piştî mirina Özal çêbû, bi dawî hat.

Piştî ku agirbesta 1993'yan têk çû, li dawiya du salan ku têra xwe bi tundûtîjiyê derbas bûn, di 15'ê Kanûna 1995'an de PKK daxwazên xwe rêzkirin û dubare bi awayekî yek-alî agirbest ragihand. Lê hem ev daxwaz nehatin bicihanîn û hem jî operasyon li dijî kampên rêxistinê yên li Bakurê Îraqê hatin kirin û agirbest careke dî bi dawî hat.[17]

Serokwezîrê wê demê Necmettin Erbakan di navbera 1996-1997'an de ew îrade nîşan dabû ku meseleya kurd bi rêya siyasî çareser bike. Hetta tê gotin ku di vê demê de Erbakan sê caran name ji bo Qendîlê şandiye. Bi rastî jî piştî salan Bayik ev xeber piştrast kir. [18]

Agirbesta sêyem a PKK di 1'ê Îlona 1998'an Roja Aşitiya Cîhanî de çêbû. Di sala 9'ê Cotmeha 1998'an de Ocelan ji Sûriyeyê hate derxistin û di 12'ê Mijdarê de bo Îtalyayê hate birin. Di 15'ê Sibata 1999'an de Ocelan li Kenyayê hate destgîrkirin û bo Tirkiyeyê hate anîn. Hema piştî vê di hilbijartinên xwecihî de ku di 18'ê

---

**17** "Devletin PKK ile İlk Teması" http://www.aljazeera.com.tr/dosya/devletin-pkk-ile-ilk-temasi

**18** Daxuyaniyên Cemîl Bayik ku tê de tê gotin ku ji aliyê Necmettin Erbakan ve sê caran name hatiye şandin:http://www.internethaber.com/pkk-ile-devletin-gizli-gorusmeleri-577474h.htm

Nîsana 1999'an de hatin kirin, HADEP'ê (Partiya Demokratîk a Gelan) 37 şaredar bi dest xistin. Roja 29'ê Hezîrana 1999'an piştî dadgehkirina Ocelan li Îmraliyê cezaya îdamê lê hate birîn. Û hema piştî vê, di meha Tîrmehê de, PKK biryar da ku têkoşîna çekdarî berde. Di 1'ê Îlona 1999'an de li ser daxwaza Ocelan, PKK sînorên Tirkiyeyê terk kir û hinek endamên PKK teslîm bûn. Di wexta vekişînê de, ji ber hêrişên tek-alî yên dewletê li gorî çavkaniyên dewletê 200 û li gorî çavkaniyên PKK nêzîkî 500 PKK'yiyan jiyana xwe ji dest da. Di 10'ê Nîsana 2002'yan de PKK ragihand ku xwe fesx kiriye û KADEK (Partiya Demokrasî û Azadiya Kurdistanê) ava kiriye. Di dawiya salê de bi desthilatdariya Partiya Dad û Geşepêdanê serdemeke nû hate pêş ku gavên bilez hatin avêtin ji bo demokratîkbûn, cîbicîkirina reformên Yekîtiya Ewrûpayê û vegerandina mafên sîvîl û siyasî yên kurdan. Pêvajoya agirbestê ku heta 1'ê Hezîrana 2004'an berdewam kir, bi hinceta şertên Ocelan ên li Îmraliyê, operasyonên leşkerî yên li dijî PKK û nebûna hewlên siyasî yên hukumetî hate bidawîkirin. Agirbesta ku di 1'ê Cotmeha 2006'an de cara pêncem hate ragihandin, bi hinceta operasyonên leşkerî ji nû ve hate bidawîkirin. Piştî ku PKK li ser bingeha "xweparastina rewa" di 13'ê Nîsana 2009'an de agirbest ragihand, peyre 34 PKK'yî ji Xabûrê bo Tirkiyeyê hatin anîn. PKK di 1'ê Hezîrana 2010'an de agirbest xirap kir; lê belê berî 13'ê Tebaxa 2010'an ragihand ku ji bo 40 rojan biryara bêçalakiyê wergirtiye û piştre ragihand ku ev dîrok heta hilbijartinên giştî yên 12'ê Hezîrana 2011'an dirêj kiriye. Agirbesta ku paşê heta 15'ê Tîrmeha 2011'an hate dirêjkirin, berî wê bi rojekê (14'ê Tîrmeha 2011'an) bi hêrişa Farqînê bi dawî bû ku PKK pêk anîbû. Heta pêvajoya nû ku di dawiya 2012'an de dest pê kir, nêzî hezar mirovî di pevçûnan de jiyana xwe ji dest da.

### Dewra Partiya Dad û Geşepêdanê (Ak Partî) Pêvajoya Çareseriyê ya Dawî

"Pêvajoya Çareseriyê" di dema desthilatdariya Ak Partiyê de hewla sêyem bû ku ya ku tê zanîn. Pêvajoya ku di Tîrmeha 2009'an de hin mafên çandî û siyasî li xwe digirt û jê re dihate gotin "Vebûna Demokratîk", li ser bangewaziya Ebdullah Ocelan hatina 34 endamên PKK jî li xwe digirt ku ji kampên Maxmûr û Çiyayê

Qendîlê hatibûn û ji Xabûrê ketibûn Tirkiyeyê. Ev ketinên Xabûrê ku têra xwe "şoreşgerane" bûn, gava ku leza werara civakî derbas kir, bû qeyranek di jiyana siyasî ya Tirkiyeyê de. Lê li Osloyê pêvajoyeke din pêk hat ku dewlet û endamên PKK hevdîtin çêkiribûn. Hevdîtin/Civînên Osloyê ku tên texmînkirin ku hewleke duyem bûye ku aliyan daxwaz ji bo bêpevçûniyê kirine û li dor maseyekê hevdîtin çêkirine. Bi dengên tomarkirî hay ji hebûna hevdîtin/civînên Osloyê çêbû ku ev deng hatibûn dizekirin.

Afet Güneş, ku li ser navê dewletê beşdarî hevdîtinan bûye, gotina wê ya di notên Osloyê de ku dibêje "Xabûr bû xala şikestinê di hemû têkiliyên me de ku teqrîben eve du sal û nîv in berdewam dikin" bi awayekî vekirî nîşanî me dide ku hevdîtinên dewlet-PKK-Ocelan piştî 2007'an dest pê kirine. Li gorî vê gotinê, di dewrekê de ku pevçûn hene, gotar tund bûne di siyasetê de, bûyerên kolanan zêde bûne di navbera dewlet û PKK de hevdîtin dihatin kirin.

Pêvajoya çareseriyê ya dawî, cuda ji yên din, li ber çavên civaka Tirkiyeyê hema bêje têra xwe dewreke aşitiyê ya şeffaf bû.

## Tecrubeyên SCS'yên Navneteweyî û SCS di Pêvajoya Çareseriya li Tirkiyeyê de

Pêvajoya Çareseriyê ku teqrîben sê salan dewam kir, bi hevdîtinên rayedarên dewletê di gel Ocelan, bi temasên parlamenterên BDP (paşê HDP) ên di navbera hukumet, Ocelan û Qendîlê de hate meşandin. Ev hemû hevdîtin, her çend naveroka wê bi temamî nehatibe eşkerekirin jî, li ber çavên raya giştî ciriya. Her çend van hevdîtinan qebûla civakê girtibe jî, dengvedana wan di nav rêxistinên civaka sîvîl de sînordar bû û ji vê hêlê ve wekî nimûneyên cîhanê ku em dibînin, piştevaniyeke xurt a civaka sîvîl jê re nehate kirin. Hetta lingê civakî yê pêvajoyê ku di tecrubeyên navneteweyî de hebû lê li Tirkiyeyê kêm ma, hewl hate dayîn ku heta radeyekê bi Lijneya Aqilmendan[19] bê pêkanîn. [20]

**19** Hemû navên ku di nav Lijneya Aqilmendan de cih girtin: http://tr.wikipedia.org/wiki/Akil_%C4%B0nsanlar_Heyeti

**20** Rojnameya Milliyet "'Akiller'le toplantı yarın Dolmabahçe'de" http://www.milliyet.com.tr/-akiller-le-toplanti-yarin-dolmabahce-de/siyaset/siyasetdetay/03.04.2013/1688584/default.htm

Lijneya Aqilmendan ku ji bo du mehan li heft herêman bi lijneyên neh kesî xebat kir, temas di gel rêxistinên civaka sîvîl ên wan bajaran kirin ku lê peywirdar in û bi vî awayî civîn li dar xistin. Lê belê xebatên vê lijneyê ku ji hêla dewletê ve hatibû çêkirin, ji ber ku bi dirêjahiya hemû pêvajoyê berdewam nekirin, qada wê ya bandorê jî têra xwe sînordar bû.

Tevkariya herî mezin a Saziyên Civaka Sîvîl ku di nav pêvajoyên pevçûnan de ne ew e ku têkiliyên civakî mirovane dike û li nav xelkê berbelav dike û dihêle ku aşitiya di navbera rêxistin û dewletê de di takekesan bigere. Ji ber ku aşitiya ku ji jor ve hatibe û civakê nehundurandibe, îhtîmala mayindenebûna wê mezin e û bi şaşiya yekem a ciddî ji nişka ve dikare vegere halê berê. Bi rastî di nimûneya Tirkiyeyê de, her wekî Cuma Çiçek îşaret pê kiriye, wisa bû; li pey sernekeftina pêvajoyê serdemeke pevçûnan a tund hate pêş ku bi zêdetir ji deh hezar mirin lê ket.

**Bandor weya Bêbandoriya Saziyên Civaka Sîvîl**

Her çend li Tirkiyeyê gelek rêxistinên mafan hebin ku bi xeyala aşitiyê bi salan xebitîne, bi destpêkirina pêvajoya aşitiyê ya dawî nehate dîtin ku rêxistinên navborî bi heman astê xebitîbin. Li vir, bêguman faktera herî mezin dikare ew be ku pêvajo tenê ji aliyê Ak Partiyê ve xwedî lê hate derketin û ji ber ku di gelek mijaran de rêxistinên mafan di gel hukumeta Ak Partiyê muxalif bûn nexwestin li hinda wê bin; çiku hukumetê nekarî pêvajoya ji bo çareseriya pevçûnê ji wê têgihîştinê rizgar bike ku digot hukumet bi tena serê xwe pêvajoyê dimeşîne. Bo nimûne neceribandina komîsyoneke koordînasyonê ku partiyên li meclîsê bi awayekî wekhev tê de bêne temsîlkirin mumkîn e bûbe enacama wê yekê ku civaka sîvîl, bi mebesta ku xwe ji partiya desthilatdar dûr bixe, pêvajoya çareseriyê bi bêdengî temaşe bike. Aşitiya ku tenê xeyalek bû lê bi dengekî xurt daxwaza wê hate kirin, di wan rojan de ku îhtîmala pêkhatina wê herî nêzîk bû, çawa wisa di gel bêçalakiyê, bêtevgeriyê weya reşbînî û bêdengiyê rûbirû hate hiştin, famkirina vê yekê ne ew qas hêsan e. Ji ber ku heqîqetek hebû ku tenê bi têkiliya di gel deshilatê weya rêxistinê mumkîn bû ku di xebatên ji bo avakirina aşitiyê de rol bê lîstin.

Gava ku em li nimûneyên cîhanê dinêrin, her çend ti pêvajoyek ku bi aşitiyê bi dawî bûye neşibin hev jî, em rastî tecrubeyeke wisa nehatine ku tenê bi ceribandinekê bi encam bûbe. Hînbûna wê yekê ku ne qezenckirin lê aşitîkirin, siyaset xurttir e ji çekê û aşitî her dem bijardeya herî bikar e ev tişt bi hewlên demên dirêj tên pê. Heçî îsrara destnbernedana wan aliyan e, ku li ser maseyê pêvajoyên gotûbêjan bi rê ve dibin, heta radeyeke mezin têkiliya îsrara destbernedana wan di gel fişarên takekes û civaka sîvîl heye.

Bo nimûne Çareseriya Pevçûna Îrlandaya Bakur, bi hewlên gelek saziyên civaka sîvîl ku bi salan li ser esasa dildariyê xebat dikirin, çêbû; divê wisa lê bê nêrîn. Her wekî Derek Mooney bi hûrgilî behsa wê kir; rahîp, jin, ciwan, yaneyên werzişê, rêxistinên polîtîk bi qasî ku karîn temasê bikin karîn di civakê de hêzeke mezin a veguhêr pêk bînin. Nexasim eger xebatên ku rahîp û mîlîtanên IRAyê yên berê bi hev re kirin li ber çavan bêne girtin, civak ji jêr bo jor hatibû amadekirin da ku bikare di gel "dijminê xwe" bijî. Dîsan di pêvajoyên Îspanya-ETA û Kolobiya-FARC'ê de jî rêxistinên jinan bi awayekî çalak cih tê de girtibûn. Di çareseriya Fîlîpîn-Moroyê de jî rêxistinên civaka sîvîl tevî rola wan a teşweîqker û piştevan hemen hemen fonksiyoneke wan a kontrolker jî hê heye.

Çareseriyên pevçûnan, her çend peymana wan a çarçoveyê hatibe îmzekirin jî, bi awayekî rast û teqez hê bi dawî nebûne. Aşitiya ku rasterast girêdayî dînamîkên civakî ye, ferz dike ku her dem xebat bê kirin. Her wekî Derek Mooney got, pêvajoya pevçûnan li Îrlandayê bi çareseriyê bi encam nebû, alî hîn bûn ka dikarin çawa bêpevçûniyê bi rê ve bibin.

Heçî Tirkiye ye, hê li destpêka wê serdemê ku hevdîtinên aşitiyê dihatin birêvebirin, di Gulana 2013'an de Çalakiyên Parka Geziyê çêbûn. Nîvê welêt zêdetir ji pêvajoya aşitiyê pêşwazî li Çalakiyên Parka Geziyê kirin ku rêxistinên civaka sîvîl û gelek rêxistinên polîtîk tê de cih digirtin. Piştî ku ev çalakî hatin derbas kirin bêyî ku zerareke wisa bidin pêvajoyê ku wê bi dawî bikin, vê carê jî têkildarî şerê Sûriyê hin bûyer qewimîn. Nexasim "Çalakiyên Kobaniyê" ku di navbera 6-8'ê Cotmeha 2014'an de qewimîn, di

nav wan rojên herî krîtîk û birîsk ên pêvajoyê de bûn. Lê belê aliyan li ser îradeya çareseriyê îsrar kirin û pêvajoyê karî saleke din berdewam bike. Bûyerên bi vî rengî ku em dikarin bi birîndarbûna pêvajoya çareseriyê bi nav bikin, bi çalakiyên başker û piştevan ên civaka sîvîl nehatin tamîrkirin. Bi îsrar û hewla akteran bi xwe pêşveçûneke sînordar çêbû.

Helbet mumkîn e em xeletiyên hukumetê û/weya PKK ên di pêvajoya çareseriyê de rêz bikin. Lê li şûna ku em dikin kêmasiyên wan kesan bêjin eger em aliyên wan ên erênî bêjin ku rîsk wergirtin û bûn akter lê li aliyê din eger em kêmasiyên civaka sîvîl bînin ziman dê pevajoyeke bingehîn ji bo pêvajoyeke bê çêke. Ji ber ku bi dirêjahiya pêvajoya çareseriyê berevajî kesên ku digotin "aşitî di gel PKK nabe" û kesên ku digotin "aşitî di gel AKP nabe", aliyan teqrîben heta sê salan karîn bêpevçûniyê pêk bînin. Hetta roja 28'ê Sibata 2015'an hukumet û parlamenterên HDP bi daxuyaniyeke hevpar ragihandin ku mutabeqat pêk hatiye.

Di çareseriya pevçûnan de ku ji bo pêkanînan aşitiya civakî gelek pirsgirêk bi kategoriyên cuda cuda derdikevin pêşiya me, tê çaverêkirin ku înîsiyatîfên sîvîl ji bo van pêşniyarên çareseriyê bikin. Bo nimûne; çêkirina şertûmercên vegera malan, rêyên rakirina hêrs û mexdûriyetên takekesî, adaptekirina rêxistinbûnên paramîlîter li civaka wan, vegerandina maf û azadiyan, xebatên rehabîlîtasyonê ji bo ku wek civak ji psîkolojiya şer derkeve, avakirina zemînên axaftinên ji bo ku qonaxa normalîzebûnê bi rêk û pêk pêşve biçe, tamîrkirina fikarên ewlehiyê. Girîng e ku îro hîna ev xebat tên kirin. Bi rastî gava ku em li pêvajoya Fîlîpîn-Moroyê dinêrin jî, em dibin şahidê wê yekê ku bi rêya wan maseyên gotûbêjan, ku ji sala 70'yî ve gelek caran hatine danîn, îro peymana çarçoveyê hatiye îmzekirin û aşitî hatiye avakirin.

Pêvajoya Tirkiye-PKK, her çend îro di serdemeke bipevçûn de be jî, xwedî kulliyatekê ye ku nikare kêm bê girtin. Bi gotina Etyen Mahçupyan ti kêmasiyek nîne ji bo pêvajoyeke nû ya çareseriyê ku em dikarin bêjin "bi axaftin meşîn ber bi aşitiyê". Tew rasti

yek heye ku tê zanîn hetta di serdemên bipevçûn de jî alî temasan çêdikin, em dikarin bêjin ku hetta îro jî em ne dûr in ji aşitiyê. Tenê ku em hem wek takekesî hem wek civak careke din bê amadehî nebin ji bo aşitiyê û em xebatên civakî yên ji bo çareseriyê ji serdestiya dewletê re nehêlin.

## KURTERABORIYA AXAFTVANAN

**Derek Mooney:** Şêwirmendê ragihandin û polîtîkaya giştî ye û li Dublin û Brukselê dixebite. Ji destpêka 1990'an ve li Îrlandaya Bakur di nav xebatên siyasî, civaka sîvîl û bi rêya xebatên SCS'yan avakirina aşitî û diyalogê de cih girtiye. Derek, di mijara Asayiş/Parastina Neteweyî de şêwirmendiya siyasî/wezaretî ji bo hukumete Fianna Fáil kiriye di navbera salên 2004-2010'an de. Berî vê, berî Peymana Îniya Bixêr (Good Friday Agreement), hem gava ku Fianna Fáil hukumet bûye û hem jî gava ku opozîsyon bûye, li ser polîtîkaya wê ya Îrlandaya Bakur xebat kirine. Di navbera salên 2002-2004'an de sekreteriya delegasyona Fianna Fáil kiriye di Forûma Neteweyî bo Aşitî û Levkirinê. Di salên dawî de şêwirmendiya Partiya Sosyal Demokrat û Karkeran kiriye li Îrlandaya Bakur. Ji 1995'an ve bûye beşdarek ji beşdarên kilît di Kargehên Diyalogên Siyasî de ku ji aliyê Navenda Aşitî û Levkirinê ya Glencree ve hatiye lidarxistin. Her wiha Rojhilata Navîn, Efxanistan û Haîtî tê de di bernameyên aşitî û diyalogê yên navneteweyî yên Glencreeyê de xebat kirine.

**Luz Piedad Caicedo:** Antropolog, femînîst, profesor di qada geşepêdanê û xebatên nav-dîsîplînî de, pispor di qada dîrok û zanistên siyasî de. Cîgirê mudîr û endam-damezrîner li Corporación Humanas – Kolombiyayê. Mijarên ku xebat li ser kirine: Sedemên beşdarbûna jinan li tawanên maddeyên hişber û rewşa jinên mehrûm ji azadiya xwe, bandorên pevçûnên biçek li ser jiyan û ewlehiya jinan û her wiha bandora terxîskirina jinan bo hêzên mîlîs li ba civatên mazûvan. Nivîskarê hevbeş e di weşanên curbecur de ku Luz Piedad, Corporación Humanasê belav kirine.

**Ana Villellas:** Ji 2006'an ve wek lêkoler di Bernameya Avakirina Pevçûn û Aşitiyê de li Dibistana Çanda Aşitiyê ya Zanîngeha Xweser a Barselonayê dixebite. Qadên wî yên pisporiyê: analîza pevçûn û pêvajoyên aşitiyê, her wiha zayenda civakî û avakirina aşitiyê. Fokusa cografîk a Villellas; pevçûnên Ewrûpa, Qefqas û Asya Navîn, her wiha qeyranên sosyo-polîtîk û pêvajoyên aşitiyê

li xwe digire. Her wiha piştgiriya hewlên Track II kiriye. Xebatên qadî li Tirkiye, Herêma Kurdistanê û Balkanan kiriye. Wek beşek ji wan xebatên xwe ku li ser mijarên jin, aşitî û ewlehiyê kiriye, di çarçoveya projeya 'Bi Temamî Rêgirîkirin li Pevçûna Civakê û Avakirina Aşitiyê' (2015-2017) de ku YE ji bo lêkolîna zayenda civakî û rêgirîkirina pevçûnên biçek li gel Zanîngeha Utrechtê û Hevbeşiya Gerdûnî çêkiriye lêkolîneke dîplomasiyê ya pir-alî çêkiriye. Ew projeyên din ku beşdarî tê de kiriye, 'Databeys(database)a Pevçûn û Avakirina Aşitiyê' ya ECP (Dibistana Çandî ya Pau) jî heye. Ji 2007'an ve yek ji wan nivîskarên rapora salane ya "Alarm" e ku der heqê pevçûna, mafên mirovan û avakirina aşitiyê de hatiye amadekirin. Her wiha yek ji nivîskarên rapora salane ya "Axaftinên Aşitiya Armanckirî: Meyldarî û Senaryo" ye. Di 2018'an de li ser mijarên wekî meseleya kurd, çareseriya pevçûnên li Qefqasa Başûr û Kosovayê, zayenda civakî û avakirina aşitiyê rapor û gotar nivîsîne. Li Îspanyayê li gelek zanîngehan di asta master û lîsansê de dersên 'Pevçûn û Avakirina Aşitiyê' û 'Jin, Aşitî û Rojeva Ewlehiyê' dide. Ana Villellasê li Zanîngeha Xweser a Barselonayê di Beşa Rojnamegeriyê de lîsansa xwe temam kiriye. Li Zanîngeha Edinburghê li ser Siyaseta Navneteweyî û Ewrûpayê master kiriye û di qada Çanda Aşitiyê de dîplomaya masterê wergirtiye.

**Huseyin Oruç:** Li sala 1969'an, li Darendeya ser bi Meletiyê ji dayik bûye. Li Zanîngeha Bogaziçiyê beşa Tûrîzmê û li Zanîngeha Anadoluyê beşa Birêveberina Giştî (public administration) temam kiriye. Di navbera salên 1992 û 1995'an de wek dildar di xebatên IHH'yê de bi awayekî çalak kar kiriye. Li sala 1995'an bû yek ji 6 endamên lijneya damezrîner a Weqfa Alîkariya Mirovî IHH'yê. Salên dirêj karên birêvebirina projeyên der-welat ên IHH'yê kirine. Di vê çarçoveyê de, li zêdetir ji 100 welatî di nav sedan xebatî de cih girt. Koordînatoriya giştî ya keştiya Mavi Marmarayê kir ku bi diruşma 'Berê Me li Fîlîstînê, Barê Me Alîkariya Mirovî' ketibû rê. Mutevelliyê damezrîner ê rêxistina sîwan a navneteweyî û îngîlîstan-navend Humanitarian Forum (Forûma Mirovî), endamê desteya damezrîner a Forûma Mirovî OIC û yek ji damezrînerên Yekîtiya Saziyên Civaka Sîvîl a Cîhana Îslamî (YSCS) ye. Weqfa Alîkariya Mirovî IHH'yê li Teşkîlata Hevkariya Îslamî û Neteweyên Yekbûyî temsîl dike. Endamê Lijne

ya Çavdêriya Serbixwe ya Pêvajoya Aşitiya Fîlîpînê ye. Huseyin Oruç, ku hêşta endamê Desteya Birêvebirin û Îcrayê ya TGTV ye û Cîgirê Serokê Lijneya Mutevellî ya Weqfa Alîkariya Mirovî IHH'yê ye, zewiciye û sê zarokên wî hene.

**Cuma Çiçek:** Li Amedê ji dayik bû, di sala 1980'yî de. Piştî ku perwerdeya xwe ya sereta, navincî û lîseyê li Amedê temam kir, sala 2004'an beşa Endazyariya Endustriyal li Zanîngeha Têknîkî ya Stenbolê temam kir. Di navbera 2005-2008'an de Bernameya Masterê ya Pîlansaziya Bajar û Herêmê di heman zanîngehê de xilas kir. Bi pêrspêktîfeke rexnegirane pêvajoya birêvebirinê ya li Amedê nirxand di têza xwe de. Di navbera salên 2009-2014'an de li Enstîtuya Êtûtên Polîtîk ya Parîsê (Institut d'Etudes politiques de Paris – Sciences Po.), di Şaxa Makezanista Zanista Siyasetê de diktoraya xwe di warê sosyolojiya siyasetê û polîtîka/çalakiyên giştî de temam kir. Çiçek, yek ji damezirînerên Weqfa Aşitiyê, endamê Enstîtuya Lêgerînên Siyasî û Sosyal ya Amedê (DİSA) ye. Di kovarên wekî Birikim, Praksis, İktisat Dergisi, Turkish Studies, Dialectical Antropology de li ser kêşeya kurd, xweseriya demokratîk, îslamgeriya kurd, birêveberiyên herêmî, peywendiyên çînî û nasnameyî, îslamgeriya kurd, birêveberiyên xwecihî, newekheviyên herêmî, peywendiyên çîn û nasnameyê, çareseriya pevçûnan û avakirina aşitiyê gotarên wî hatine weşandin. Hêşta li bin banê Navenda Lêkolînên Navneteweyî ya Enstîtuya Etûtên Polîtîk a Parîsê (Centre de Recherches Internationales – CERI) xebatên xwe yên akademîk dike.

**Gülçin Avşar**: Gülçin Avşar, di 2008'an de ji Peymangeha Huqûqê ya Zanînghea Marmarayê mezûn bû. Peywir girt ji bo birêvebirina xebatên qanûnî yên Bangewazên Edaletê ji bo Zarokên Mexdûrên QTT (Mexdûrên Qanûna Têkoşîn li dijî Terorê) û yên Komîteya Hevgirtinê di gel Karkerên Qûmkirina Kotan ku tûşî nexweşiya sîlîkozê bûne. Di nav xebatên saziyên civaka sîvîl û înîsiyatîfan de cih girt; wekî Tevkariya Hemwelatiyan li Vebûna Demokratîk, Platforma Destûra Bingehîn a Nû. Di 2013'an de rapora "Rûyê Din ê Ergenekonê: Kiryar Nediyar û Windahî" nivîsî ku ji aliyê TESEV'ê ve hate weşandin. Avşar, ku tevkarî li xebatên teorîk û pratîk ên ji bo çareseriya meseleya kurd kiriye, li Stenbolê parêzeriyê dike.